

Resûlûllah Kesayetîya Nimûneyî ya Bêhempa

# Hezretê Mûhemmed Mûstefa

*-dirûd û silavên Xuda lê bin-*

Osman Nûrî TOPBAŞ

WEŞANÊN ERQEM

Resûlûllah Kesayetîya Nimûneyî ya Bêhempa

# Hezretê Mûhemmed Mûstefa

-dirûd û silavên Xuda lê bin-

Osman Nûrî TOPBAŞ

| | |
|---|---|
| **Navê Resen:** | Emsalsiz Örnek Şahsiyet Muhammed Mustafa (s.a.v.) |
| **Nivîser:** | Osman Nûrî Topbaş |
| **Wergêr:** | Mehmet Seyhan [Mela Mûhemmedê Bêrkevanî] |
| **Rastker:** | Abdusselam Kartal [Mela Ebdusselamê Bêcirmanî] |
| **Qordînator:** | Muhammed Davuthan Kılıç |
| **Grafiker:** | Cihangir Taşdemir |
| **ISBN:** | 978-9944-83-812-2 |
| **Navnîşan:** | Ikitelli Organize Sanayi Bölgesi Mah. Atatürk Bulvarı, Haseyad 1. Kısım No: 60/3-C Başakşehir, Istanbul, Turkey |
| **Tel:** | (+90-212) 671-0700 pbx |
| **Fax:** | (+90-212) 671-0748 |
| **E-mail:** | info@islamicpublishing.org |
| **Malpera We bê:** | www.islamicpublishing.org |
| **Sertifika çapê:** | Weşanên Erqem |
| **Language:** | Kurdish |

WEŞANÊN ERQEM

**Bi Navê Xudayê Dilovanê Dilovîn**.

Cenabê Heq Teala, mezinê me Resûlê Ekrem [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha dide naskirin û pêşkêş dike:

“**Me Tu, ji alemê re bes wek rehm şandî**.” [1]

“**Ey Pêğember! Bi rastî me tu şandî ji bo tu bibî şahid, mizgînder û hişyarker; bi destûra wî tu bibî gazîker ji bo teblîğa dînê Xuda û çirayeke ronahîker**.”[2]

“**Sûnd be ku ji bo we, di Resûlûllah de ji bo wî yê ku Xuda û roja dawîyê hêvî dike û Xuda di bîra xwe pirr tîne, nimûneyeke sipehî û kamil heye**.”[3]

“**Bêguman perûyeke bêqutbûn ji te re heye, bi rastî tu, xwedî exlaqekî mezin î**.”[4]

---

1. Enbîya, 21/107.
2. Ehzab, 33/45-46.
3. Ehzab, 33/21.
4. Qelem, 68/3-4.

**“Gelî yên ku îman anîne! Bi xebera Xuda bikin, bi xebera pêğember bikin û bi gunehan karên xwe jî pûç nekin!”**[5]

**“Kî, bi xebera Xuda û pêğember bike, ha ewê digel wan kesan be ku Xuda nîmeta xwe li wan kiriye ku ew jî pêğember, rastdêr, şehîd û salih in, ha ew çi xweş-heval in!”**[6]

**“Bêguman Xuda û ferîşteyên wî selatan li ser Muhemmed pêğember didin. Gelî yên ku îman anîne! Naxwe hûn jî selewatan li ser wî bidin û tam bi teslîmiyet silavan li wî bikin.”**[7]

---

5. Mûhemmed, 47/33.
6. Nîsa, 4/69.
7. Ehzab, 33/56.

# Pêşgotin

Hemd û senayên bêdawî ji Mewlayê me re bin, ewê ku qencî û îhsan li me kirine û ew şeref daye me ku em kirine ummeta Hebîbûllah [hezkirîyê Xuda] sertaca hemû pêğemberan, mezinê me Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin]!..

Dirûd û silavên Xuda her li ser kesayetîya nimûneyî ya bêhempa mezinê me Mûhemmed Mûstefa be; ewê ku tava tavan, nûra heqîqet û hîdayetê ye. Ewê ku tim û daîm di rêya bextewarî û seadeta ebedî ji bo temamê beşerîyetê de ronahîker e!...

Cenabê Heq Teala ew, di zortirîn û buhrantirîn zemanê mirovatîyê de jê re wek pêğember şand. Wî, di serdemeke ku dinya di nav taristanî û zulimê de ğerq dibû de ew **rehmeten lîlalemîn/ji alemê re wek rehm** ji bo însanîyetê kir xelat û dîyarî. Wî ew; her wekî stêra Sureyya'yê ku ji ufûq û asoyên jorê ve derdikeve ji dinyayê re îkram û îhsan kir ku ew dem; civak di nav tarîtîyên xwe de di wehşet, îsyan û ğefletê de ji heywanan jî derbas bûbû.

Yanî Xuda Teala;

ew; ji bo hemû heyber û mexlûqatan; candar û bêcanan, ber û keviran, rûbar û çeman, derya û behran, erd û asîmanan û

zeman û mekanan bi taybetî jî ji bo insan wek rehmeke bêdawî lutf û îhsan kir. Ew ji bo bereket, hîdayet, merhemet, şefqet û xilasîyê kir wesîle û navgîn.

Ew rehmeke wisan e ku her mexlûq, ji bo hurmet û xatirê wî hatiye aferandin û xuliqandin û bi qasî hezkirina xwe ji wî li cem Heq Teala qedr û qîmet wergirtîye.

Ew rehmeke wilo ye ku şefqet û dilovanîya wî, hemû însanîyet heta hemû mexlûqat di bin xwe de nixumandine.

Ew rehmeke welê ye ku ji terefê cenabê Heq Teala ve wek serkehnîya ava heyata ebedî û bi wesfên mûstesnatirîn jî wek çavkehnîya feyz û bereketeke bênîhayet ji bo hemû dil û mejîyan hatiye lutf û îhsan-kirin.

Ew rehmeke wisan e ku bi wî, rêbera hîdayeta bêdawî Qur'ana Pîroz hatiye îkram-kirin.

Ew rehmeke wilo ye ku ew hezkirî û hebîbê Xudayê Rehman û Rehîm e. Hem jî ew, ew pêğember û resûl e ku Heq Teala mîrac ji wî re bexş kiriye.

Ew rehmeke wisan e ku heke ew nebûya, hemû alem û cîhan dê bibûya çoleke bêkes û bêkûs.

Ew rehmeke welê ye ku destpêka xulqîyet û aferandinê bi nûra wî wicûd û hebûn, bidestxistiye.

Ew rehmeke wilo ye ku sipehîtî û xweşikbûnek li kuderê hebe, ew eks û xuyabûneke wî ye û ew, ji bo hurmet û xatirê ava rûyê wî hatiye xuliqandin. Di cîhanê de çîçekek bel nabe, heke ne ji nûra wî be! Lewra heke ew nebûya, tiştek dê nebûna. Her ew e, yê ku em bi xêra wî hene. Her ew e, ew

ğunçe û gulpika îlahî ku ji nûreke tekûz û mûkemmel e. Êdî her ku diçe ew naqermiçe; lêbelê hîn bêhtir xweşiktir, geştir, tazetir û tertir dibe.

Ew rehmeke wilo ye ku Xuda Teala bi xwe qedr û qîmetê wî vedibêje. Hem jî selewatan li ser wî dide...

Ha di bin ban û konê nibiwweta wê rehma mûstesna de hemû alemê hizûr û aramî te‘m kir. Însanîyeta ku di dehlîzên Cehaletê de bi dûyê îsyanê dikir bixeniqe û ketibû ber sekeratê, bi derîyên îlm, îrfan û heqîqetê yên ku wî jê re vekirin, wê bask û perên xwe di asîmanên fereh de vekirin û destpê kir nefesên heyata taze wergirtin. Ew wijdanên ku wekî keviran hişk û hola bûbûn, di destê wî yên bi feyz de wekî hevîr nerm bûn û pehtineke nip-ûnû qezenc kir. Ew qelb û dilên ku di nav qirêj û jengarê de perîşan bûbûn, di kehnîya wî ya bîllûrî de hatin şûştin, hatin şûştin û her yek ji wan bûne cihekî sewdayê yê tertemîz û tije-nûr.

**Wek nimûne;** Wehşîyê Hebeşî berî were ser hîdayetê, zilamekî wehşetê rûh-cenewar bû ku xwîn vedixwar. Lêbelê paşê, ew bi awayê teslîmbûna ji terbîye û perwerdeya wî ya bilind re bû “**sehabîyekî çav-bihêstir**”. Gellek mirovên din jî her wekî wî hebûn; ew berî werin ser hîdayetê, ketibûn nav pençeya sifetên zehf xirab û rûh û rewanê wan miribû. Lêbelê paşê wan jî ji heman kehnîya hîdayetê av vexwar û gihiştin sağbûn û zindîtîyeke ebedî, ew hemû jî gihiştin mezinbûn û pakbûneke ku ew bi unwan û peyva “**Hezretê**” tên bibîranîn.

Ev hemû nîşan didin ku mezinê me [dirûd û silavên Xuda lê bin] mezintirîn xarîqûl-adeya hunerê îlahî ye ku cenabê Heq Teala ew anîye wicûdê. Ew ji hêla zahir û batinê xwe ve wisan

e. Ew ji hemû mexlûqatan mûkemmeltir e, mûkerremtir e û hezkirîtir e.. Ew mirovekî wilo ye ku her yek ji suleha, esfîya, ewlîya, hukema û cîhangîrên ku di tarîxa beşerîyetê de qutbekî [cemserekî] heqîqetê ne, bes nimûnekek ji eks û xuyabûna wî ne. Ew perçekek ji wê nimûnê ne. Ew tave-heyveke ku ronahîya xwe ji taverojê wergirtiye. Lewra ew, ji bo temamê alem û cîhanîyan rehm, lutf û dîyarîyeke Xaliqê Zulcelal e.

Bi vê qebûlê, nêzîkbûna Xuda Teala û rêya mezherbûna riza'ya îlahî jî dîsa bi hezkirin û pêbendbûna wî tê qezenckirin. Cenabê Heq Teala vê heqîqetê wiha beyan dike û dibêje:

"**Bibêje: Heke hûn bera ji Xuda hez dikin, naxwe bidin pey min, hingê Xuda jî dê ji we hez bike û ewê li gunehên we bibûre. Xuda, her gunehbexş û dilovîn e**."[8]

"**Kî, bi gotina pêğemberî bike, hemin wî bi gotina Xuda kiriye û kî, berê xwe jê vegerîne, me tu ji wan re wek parêzkar ne şand î**!"[9]

Ha ev e, ew heqîqeta ku hîç ti evdekî îman bi Xuda Teala anîbe, nikare li hemberî wê bêgane [bê-elaqe û bêhest] bimîne. Wekî ku ayet jî bi kirp vedibêjin:

Naxwe mî'yar û endaza yekane ji bo hezkirina Heq Teala tabî'bûn û bidûvketina Resûlê Xuda ye, pêbendbûna bi wî ye, perwane û perperîkbûna li hawîrdora wî ye. Heke na, îman, îman nayê hesabê. Bi vê qebûlê, hîç ti evdek nikare bi ti awayekî din xwe bi Xuda Teala bide hezkirin. Ew evdê ku

8. Alî Îmran, 3/31.
9. Nîsa, 4/80.

nekarîbe xwe bi Xuda Teala bide hezkirin jî, hemû kirinên wî pûç û beyhûde ne.

Naxwe divê her wext û gavê Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di navend û merkeza jîyana me û dilê me de be. Dîsa divê kesayetîya nimûneyî ya wî jî, mîmar û avasazê exlaq û rewîştê me be.

Ji ber vê ye ku bêguman mezintirîn îhtiyaca me ew e; em hê bêhtir ji nêzîk ve wî nas bikin... Em zehf ji nêzîk ve wî îdrak û fehm bikin.. Heta ku paşê mirov jî wan nefesên ku wî distandin, bistîne.. Heta ku paşê nebzê mirov jî bi qelbê wî re bi yek bibin... Heta em bibin wekî sehabe û hevalên wî yên kîram... Heta mirov bibe wekî wan evîndar û aşiqên ku ceger û kezeba wan ji hezkirina pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] peritîye, şewitiye...

Heke çi qeder gihiştina me -bêçare û bêkêran- ji bo sewîye û asteke ku layiq û babetê wî be, ne mûmkin be jî; lêbelê hîç nebe jî, hema ku mirov di wê rê de be ew jî, seadet û bextewarîyeke mezin e.. Lewra hisskirin û hestpêkirina bi nebzekekî ji kesayetîya nimûneyî ya bêhempa ya wî, derîyê wusleta ebedî ye.

Bi vê îtîbarê [bi vê li ber çavan girtinê], bi meqseda hê bêhtir ji nêzîk ve naskirina kesayetîya wî ya mezin û pak, ev berhema naçîzane ya li ber destê we heke çi qeder bi hibr û mûrekeba nuqsanî û nekarînê be jî, dîsa me hewldaye ku wê li qelemê bidin.. Me di eser û berhemên xwe yên berîya vê de, ji melûmatên di bara kesayetîya pak û tahira mezinê xwe, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de kurte û xulaseyek hazir kir.

Belku gotinê me ne layiqê wî bin; lêbelê temamê me, hem bi awayê ku em sîyera wî vebêjin, hem jî bi awayê ku em sunneta wî bijîn, em mecbûr in spasîya wê dîyarîya mezina îlahî bikin. Mezintirîn erk û wezîfeya me ev e; em bi qasî derfet û taqeta xwe, em bi qasî hêz û qeweta xwe bibin pirek ji bo rehma wî û hizûra wî ya bêdawî -ku alem tev dikeve ber wê- hilgirin û biguhêzin serdem û halê xwe yê hazir, axirzemanê, ewê ku bi buhranên nûjen dike bixeniqe. Dîsa deynê me ye ku heta zimanê me lê bigere, em bi awayê sipehîtirîn wê zirweya xarîqûlade û şehesera hunerê bi temamê însanîyetê bidin naskirin. Bi taybetî jî divê em bi awayê sipehîtirîn wî bi halê xwe temsîl bikin, ha ev e, ji me re şerefa ji her şerefê mezintir...

**Cenabê Heq Teala hinek paran ji kesayetîya nimûneyî ya bêhempa ya wî bike qismetê me tevan! Dilê me bike qesra îşq û evîna wî! Me di îmtîhana teqwayê de bi pêbendbûn û teslîmbûna ji wî re serfiraz bike! Bi vî awayî, me ji evîndarî, mûhebbet û rizaya îlahî re bike mezher û xuyageh!**

**Amîn**...[10]

10. Ez ji Xuda Teala hêvî û lavlavê dikim ku ew hewldana xwendevanên me yên ezîz, yên ku her hewl dane û di amadekirina vê berhemê de her arîkarî pêşkêş kirine, wê hewla wan ji wan re bike sedeqa carîye.

# Kesayetîya Nimûneyî ya Bêhempa Hezretê Mûhemmed Mûstefa

Teqwîm û tarîxa pêğemberan, bi îkramkirina hebûna pêşî "nûra Mûhemmedî" ji însanê pêşî re, destpê kiriye; bi zihûr û xuyabûna "cismanîyeta Mûhemmedî" di alema dinyayê de jî bi dawî bûye. Yanî ev nûra pak, ji nesla temîztirîn û esîltirîn hatiye û hatiye heta di dawîyê de gihaye Ebdûllah, bi hemlebûna Amîne Xatûnê re jî ji enîya Ebdûllah nûra hebûnê, întîqal kiriye û gihaye vê dêya bi bext û bi şens, di nîhayetê de jî ji wê jî bi xwediyê eslîyê wê mezinê aleman hatiye teslîmkirin..

Menzûmeya kaînatê, ji nûra mezinê me Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] hatiye meydanê. Ji ber vê ye ku, hezar û yek texlîtên nexşan û herkên qudreta îlahî, karvedan û tebessumek ji nûra wî ne. Ji ber ku hinek axa Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] li ser axa Adem [silavên Xuda lê bin] hatiye danîn, tobeya Adem hatiye qebûlkirin. Wekî ku di hedîsa şerîf de wiha hatiye fermankirin:

*Dema Adem [silavên Xuda lê bin] ew pêşemitîna xwe ya ku bû sebebê derxistina wî ji cennetê, kir, wî şaşîya xwe fehm kir û got:*

“-*Ya Rebbî! Ez bi heqê Mûhemmed, efûya xwe ji te dixwazim.*” *Xuda Teala jê re got:*

*“-Hey Adem! Tu, wî Mûhemmedê ku min hê ew nexuliqandiye ji ku dizanî?”*

*Adem [silavên Xuda lê bin] got:*

“-Ya Rebbî! Dema te ez aferandim û ji rûhê xwe di min de puf kir, min serê xwe rakir, min dît ku wa ye, li ser stûnên Erşê de hevoka “**Laîlahe îllellah, Mûhemmedûr-Resûlûllah**” nivîsandîye. Min zanî ku tu bes navê hezkirîtirînê mezlûqan li ber navê zatê xwe datînî!” Xuda Teala jê re got:

*“-Hey Adem! Te rast got. Bi rastî ew li cem min ji hemû mexlûqatan hezkirîtir e. Bi heqê wî dûa ji min bike. [Madem te dûa kir], naxwe min jî tu efû kirî.* ***Heke Mûhemmed nebûya, min tu nedixuliqandî****.*”[11]

Ha Hezretê Adem [silavên Xuda lê bin] meziné me Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji dûaya xwe re kir wesîle û navgîn; ji lewma ew bi ber efûya îlahî ket. Ew Resûlê tahir, ket pişta Îbrahîm; vêca agir ji wî re hînik û bi selametî bû. Dema ew durra pak ket sedefa Îsmaîl, li ser navê wî, ji asîmanî beranek hate xwarê.

Wekî ku hate dîtin, pêğemberan jî bi xatirê wî ji rehma îlahî îstîfade kirine. Heta her wekî Hezretê Mûsa [silavên Xuda lê bin] hinek pêğember derketine holê û yekser xwestine bibin ummeta wî da ku bigihin bereketa wî.

11. Hakim, el-Mûstedrek ‘eles-Sehîheyn, Beyrût, 1990, II, 672/4228.

Li gorî rîwayeta Qetade kurê Nûman [Xuda jê razî be] Hezretê Mûsa [silavên Xuda lê bin] wiha got:

“-*Ya Rebbî! Di lewheyên*[12] *ku ji min re hatine dayîn de ez dibînim ku behsa ummeta ji hemû ummetan çêtir hatiye kirin; ew ji nav însanan hatine derxistin, şîreta qencîyê dikin û mena neqencîyê dikin. Xudayê min! Wan ji bo min bixe ummet!*”

Xuda Teala jê re got:

“**-Ew ummeta Ehmedî ne**.”

Mûsa [silavên Xuda lê bin] got:

“-*Rebbê min! Ez di lewheyan de dibînim ku wa ye behsa ummetekê hatiye kirin; ew di hatina dinyayê de yên paşî ne û di çûna cennetê de jî yên pêşî ne. Wan ji bo min bixe ummet!*”

Xuda Teala jê re got:

“**-Ew ummeta Ehmedî ne**.”

Mûsa [silavên Xuda lê bin] got:

“-*Ya Rebbî! Dîsa di lewheyan de behsa ummetekê tê kirin ku Încîl’ên [kitêbên] wan di singên wan de ne, wan ji ber dixwînin. Haleve ku ummetên berîya wan li kitêbên xwe dimeyzandin û wilo dixwendin, çi dema kitêbên wan ji ber wan hatin rakirin û winda bûn, tiştek ji wan ji ber nekiribûn û ew nezanîn. Xuda hêzeke jiberkirin û parastinê daye wan ku berî wan ew nedaye ti ummeteke din. Xudayê min! Wan ji bo min bixe ummet!*”

12. Rûpelên Tewratê.

Xuda Teala jê re jê re got:

“**-Ew ummeta Ehmedî ne**.”

Hezretê Mûsa [silavên Xuda lê bin] got:

“-*Ya Rebbî! Ez di lewheyan de ummeteke wisan dibînim ku îmanê bi kitêba pêşîyê û bi kitêba paşîyê jî tînin, şerrê her texlîtê rêşaşîyê dikin, heta ew şerrê yek-çavê derewîn Deccal jî dikin. Wan ji bo min bixe ummet!*”

Xuda Teala jê re got:

“**-Ew ummeta Ehmedî ne**.”

Hezretê Mûsa [silavên Xuda lê bin] got:

“-*Ya Rebbî! Ez di lewheyan de ummeteke wisan dibînim ku ew sedeqeyên xwe dixwin û pê xwendan xêr jî dibin. Herçî ummetên berîya wan bûn, dema yekî ji wan sedeqekek dida û jê dihat qebûl-kirin, Xuda agirek dîşand, wî ew dixwar. Lêbelê heke ew nehatiba qebûl-kirin, wî agirî ew nedixwar, ew wilo dihişt, vêca dirinde û teyran ew dixwar. Xuda ji bo feqîrên wan sedeqeyên wan ji dewlemendên wan werdigre. Xudayê min! Wan bixe ummeta min*!”

Xuda Teala jê re got:

“**-Ew ummeta Ehmedî ne**.”

Hezretê Mûsa [silavên Xuda lê bin] got:

“-*Rebbê min! Ez di lewheyan de ummeteke wilo dibînim; dema yek ji wan qesda xêrekê bike, lê paşê jî wê neke, hingê jê re hesenetek tê nivîsandin; lêbelê heke ew qesda wê bike û*

*wê bike jî, hingê jê re ji deh xêran, heta bi heft sed xêran tên nivîsandin. Xudayê min! Wan ji bo min bixe ummet!*"

Xuda Teala jê re got:

"**-Ew ummeta Ehmedî ne**."

Hezretê Mûsa [silavên Xuda lê bin] got:

"-*Ya Rebbî! Ez di lewheyan de ummeteke wisan dibînim ku ew hem ji hev re şefaetê dikin, hem jî şefaeta wan di bara hev de tê qebûl-kirin. Wan ji bo min bixe ummet*!"

Xuda Teala jê re got:

"**-Ew ummeta Ehmedî ne**."

Paşê Hezretê Mûsa [silavên Xuda lê bin] ew lewheyên di destê xwe de li kenarekî danîn û got:

"-*Xudayê min! Naxwe min jî bixe yek ji ummeta Ehmed!*"[13]

**Welhasil**; her heleqeyek ji zincîra pêğemberên hîdayetkar û mûbarek xuyabûn û zihûra mezinê me Hezretê Mûhemmed Mûstefa yê ku wek rehm ji bo alemê hatî şandin mizgînîyeke îqbal û seadetê bû...

Di nîhayetê de nûra çavlibendê, di 571'ê mîladî, 12'ê Rebîûl-ewwelê, sibeha duşemê de, berî roj derkve, peya bû, hate alema zihûr û şihûdê, di ber pêsîra zewaca Ebdûllah û Amîne de şeref da her zeman û her mekanî.

13. Teberî, Camîul-Beyan en Tewîlîl Ayîl Qur'an, Beyrût, 1995, IX, 87-88; Îbnû Kesîr, Tefsîrûl Qur'an'il- Ezîm, I-IV, Beyrût, 1988, II, 259, [tefsîra sûretê 'Eraf, 7/154].

Bi zihûr û xuyabûna wî re, rehma Xuda li vê alemê hate coşê û lê zêde bû. Sibeh û êvaran rengên xwe guherandin. Hest kûr bûn. Peyv, sohbet û lezzet fereh bûn; her tiştî maneyeke cuda, letafeteke cuda qezenc kir. Pût hejîyan û bi ser erdê de ketin. Li bajarê Kisrayan Medaînê di qesr û sarayan de sitûn û kûle derizîn. Gola Sawe di avzêma zulmê de çikîya. Qelb û dil ji feyz û bereketê tije bûn. Vê bereketê, kaînat hemû, yanî hemû zeman û hemû mekan dane ber xwe.

Hezretê pêğember [dirûd û silavên Xuda lê bin], ewê ku temamê fezîletan di xwe de kom kiribû, heke nehatiba, şeref nedaba dinyayê, însanîyet dê heta qîyametê di nav zulm û wehşetê de bimana, zeîf her dê di bin destê xurtan de esîr û dîl bimana. Hevkêşî û mûwazene dê di lihê xiraban de xirab bibûna. Dinya jî dê bibûya dinyaya zalim û xurtan.

**Şairî** ev rewş çi xweş û ciwan îfade kiriye:

*Ya Resûlellah, heke tu nehatibayî dinyayê,*
*Gul bel nedibûn, bilbilan nedixwind û nav ji Adem re mechûl diman,*
*Ji hebûnê re ti maneyek nedima, alem di matem û ğeman de ğerq dibû!..*

Dostê mezinê Heq Teala Mewlana Celaleddînê Rûmî -quddîse sirrûhû- ewê ku di temamê emrê xwe de singa xwe daye ber çîle û janên ku nayên eql û xeyalê, behsa vê zerûretê dike; divê em ji bo hatina Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] ewê ku pût şikandin, edalet li sererdê belav kir û zulm ji singan rakir, hest bi minnet û keremê bikin û vê merama xwe jî wiha îfade dike:

“*Ey mislimanê îro! Heke hewl û cîhada mezinê me Ehmed [dirûd û silavên Xuda lê bin] nebûya û himmeta wî di xusûsa şikandina pûtan de nebûya, vêga te jî wekî bav û kalên xwe pût dihebandin.*”

❁

Ev **însanê ummî,** yê ku ji nav civakeke cahil û ji medenîyetê dûr derketî, çawa wî bi naveroka îlm û hikmeta ku derxistî holê mirovên wê dewr û serdemê bêçare hiştibûn, eynî wisan ew bi deryayeke mûcîzeyan hatiye ku heta vêga kes negihaye wan û heta qiyametê jî ti kes nagihîje wan.. Ev bi vê jî sabit e ku Qur’ana pîroz, digel ku behsa hinek hadîse û bûyerên ku di dema bûrî de çêbûne û behsa rewş û gellek mijarên îlmî û fennî yên ku di paşerojê de xuya bibin, dike jî, ev bû 1400 sal e ku ti keşf û îcadekê ew tekzîb nekiriye.. Hal-hal e, heta îro jî meşhûrtirîn û navdartirîn ansîklopedîyên dinyayê jî hema bibêje her sal cildekî pêvek û îlawe derdixin, bi vî awayî xwe ji bo nûkirin û sererastkirinê mecbûr dibînin.

Wî pêğemberê sêwî û ummî, ders ji ti mirovan wernegirtibû; lêbelê ew wek xilaskerê beşerîyetê, tercumanê alema ğeybî û seydayê mekteba heqîyê hatibû dinyayê.

Hezretê Mûsa hinek ehkam anîbûn. Hezretê Dawud bi dûayên ji Xuda Teala û mûnacatên pê re bûbû mirovekî mûmtaz. Hezretê Îsa hatibû şandin ji bo mekarimê exlaq û zuhdê li mirovan hîn bike. Pêğemberê Îslamê, Hezretê Mûhemmed Mustefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî temamê van xesletan anîne; ehkam eşkere kirine. Wî nefs tezkîye kir û bi dilekî berraq dûa-kirina ji Xuda Teala li mirovan hîn kir. Wî exlaqê ji hemû exlaqan xweştir da zanîn û ew bi jîyana xwe

jî ji bo wî exlaqê xweş bû nimûne.. Wî tewsîye li mirovan kir ku divê ew bi dinyaya xapînok neyên xapandin. Bi kurtasî; wî temamê selahîyet û wezîfeyên hemû pêğemberan di xwe de kom kirine. Esaleta neseb û edebê û seadeta cemal û kemalê tev di wî de kom bûbûn.

Wî çil salan jîyana xwe di nav civakeke cahil û nezan de bûrand. Pirranîya mûkemmelîyetên ku wî dê paşê derxista holê, hê jî ji xelkê re mechûl bûn. Ew wek dewletmendek [zilamekî dewletê], waizek û xetîbek [peyvdarek] nedihat zanîn. Ji xwe tu jê behs neke ku ew serdarekî mezin e! Lêbelê ew hê serbaz û leşkerekî ji rêzê jî ne merûf û naskirî bû.

Lêbelê çil salîya wî, ji bo însanîyetê bû xala werçerx û rojbuhêrkê.

Berîya wê çaxê, ji wî hîç nehatibû bihîstin û sehkirin ku wî qet behsa serpêhatiya milletên bûrî, tarîxa pêğemberan, roja qîyametê û cennet û cehennemê kiribe. Lêbelê ew di halê şexsê xwe tenê de di nav jîyan û heyateke ulwî û exlaqekî bilind de bû. Lêbelê çi dema ew bi erk û wezîfeyeke îlahî ji şikefta Hîrayê vegerîyabû, ew bi temamî guherîbû.

Çi dema wî dest bi teblîğê kir, temamê Erebistanê di nav xewf, tirs û şaşo-maşo û matmayînê de mabû. Belağeta wî ya xarîqûl-ade û xîtabeta wî, her wekî sêhrê ew bi xwe ve girêdabin, wisan tesîreke zêde li wan kiribû. Êdî pêşbazî û mûsabeqeyên şiêr, edebîyat û wêje, belağet û fesahetê sifir bûn. Ji piştî vê, êdî şiêra ti şairekî ku di pêşbirkê de qezenckirî bi dîwarê Ke‘bê ve nehat daleqandin. Bi vî awayî, enene û kevneşopîyeke ku ji sed-salan ve dihat tevlî tarîxê bû. Ev yek

ewqas bi bandor bû ku heta xweha şairê navdar Îmreûl Qeys ya ku ji şiêrê baş fehm dikir jî dema wê ev ayeta ha bihîst,:

“**Hat gotin: Hey erdê ava xwe daqurpîne, ya asîmano, tu jî barana xwe veke! Av kêm bû û çikiya, ferman bi cih hat, keştî jî li ser çiyayê Cûdîyê rawestiya û hate gotin: Bila ew qewmê zaliman dûr û tine bibe**!”[14] wiha got:

“-Êdî ti kes nikare tiştekî bibêje. Şiêra birayê min jî nikare di meydana îftîxarê de bimîne!..” û şiêra Îmreûl Qeys a ku di pêşîya şiêran de hatibû danîn û bi dîwarê Ke‘bê ve hatibû daleqandin, ji dîwêr kir, û anî xwarê. Her çî ew şiêrên din yên ku di sewîyê de [di Mûelleqatê de] ji wê kêmtir bûn, ji ber ku tişteke wan nemabû bibêjin, ew jî yek bi yek ji dîwarê Ke‘bê hatin peyakirin û xistin.[15]

Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi awayekî kiryarî û fiêlî li temamê însanîyetê da hînkirin ku ew li sererdê Resûlê Heq Teala ye û ji bo temamê mirovatîyê hatiye şandin.

Wî di hemû qad û warên her wekî heyata îctîmaî, kulturî, îqtîsadî, îdareya girseyan, têkilîyên navdewletî û yên wekî van de mûkemmeltirîn qaîde û rêzûrêç danîne. Ew qad û warên ku zilamên bijarte yên îlmê heta pirranîya emr û temenên xwe di lêgerîna wan de derbas nekirine û heta piştî ezmûn û tecrûbeyên fereh ên wan di ser însan û tiştan de derbas nebûne, ew di hikmeta heqîqî ya wan negihane. Bêşiwar însanîyet,

14. Hûd, 11/44
15. Ahmed Cewdet Paşa, Kısas-i Enbîya ve Tewarih-i Hulefa, İstanbul, 1976, I, 83.

çi qeder di mijara agahîyên teorîk û tecrûbeyên pratîk de bipêşkeve, ewê hê bêhtir **heqîqeta Mûhemmedî** fehm bike.

Ev Pêğemberê Mezin, berî wê gavê, hîç nerahiştibû şûr, perwerde û ders û telîma leşkerî jî nedîtibû; lêbelê ew neqleke tenê wek çavdêr û seyrker beşdarî herbê bûbû. Digel ku rehma fereha wî hemû însanîyet dixist ber xwe jî, ew bû leşkerekî cesûr û mêrxas û fermandarekî bi dîrayet û hosta, wî ji bo mûcadeleya Tewhîdê û silha îctîmaî xwe ji dijwartirîn şerran jî li paş nehiştiye.

Ew derî bi derî digerîya û dînê Xuda Teala ji mirovan re teblîğ dikir. Lêbelê ewên ku nesîbê wan di hîdayetê de nebû, ev tava hîdayetê ya ku ji wan re hatibû, bi bêwijdanî derîyên xwe girtin û ji xwe re tercîh kirin ku ew heta hetayê di nav tarîtîyê de bimînin. Heta hinek caran ji ber qesawet û hişkîtîya di qelbê wan de bi pêğemberê Xuda Teala dijwar û bi bêedebî tevgerîyan. Lêbelê ew, ne bi sedem tevgerên wan yên dijwar li hemberî xwe; feqet ew bi sedem ğeflet û cehaleta wan diêşîya.

Wî ji însanên wiha re digot:

“**Ez ji bo ragihandina xwe ya Qur’anê ji we re ti heqzimanekê ji we naxwazim**.”[16] lêbelê ez ji bo memnûnkirin û rizamendîya Xuda Teala wê ji we re teblîğ dikim.

Wî, di nav neh salan de bi hêzeke leşkerî ya ku bi qasî sêyeka leşkerên dijminan, karîye temamê Erebistanê fetih bike. Hem jî bi zayîatên canî yên ewqas hindik ku mirov bibêje hema nebûne... Wî bi hêza rûhanî û perwerdeya leşkerî ya ku

16. Sad, 38/86

da wan însanên ku di serdema xwe de mirovên bê dîsîplîn û bêserûber bûn, bi wan mirovan di fitûhatan de serkeftineke mûcîzewî qezenc kir. Wî serkeftineke ewqas mezin bidestxist ku mislimanên li pey wî hatin karîn împeretorîyên Rûm û Persê têkbişkînin. Hem jî ew herdu împeretorîyên ku di wê dewr û serdemê de dewletên xurttirîn û biheybettirîn bûn.

Bi vî awayî, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] digel hemû şert û mercên menfî û neyênî jî karîye di tarîxa beşerîyetê de şoreş û înqîlaba mezintirîn bîne meydanê. Wî karîye zaliman ji holê rake û dawîyê li rondik û hêstirên mezlûman bîne. Destên mûbarek ên wî ji bo pora sêwîyan bûne şeh. Bi tîrêjên wî yên hêvîyê dil û qelb ji kul û ğeman xilas bûn.

**Şair Mehmed Akîf**, vê menzerê û dîmenê çi xweşik îfade dike û dibêje:

*Zeman hat, ew sêwî mezin bû û giha çil-salîya xwe,*
*Ew lingên bi-xwîn ên ku li ser serîyan dimeşîn, gihiştin avê!*

*Wî mesûmî di pifeka îmanî ya ku di dilan de pifkirî de însanîyet azad kir,*
*Wî di hemleyeke tenê de Qeyser û Kisra dan erdê û ew tine kirin!*

*Wî ew bêçare û şerpeze ji zilletê xilas kirin ku, ewên ji perîşanî û zilletê pê ve ti heqê wan nebû,*
*Nedihat bîra zaliman ku ewê rojekê zail bibin û herin, lêbelê ew mirin û cehemîn!*

*Belê, şerîeta wî ya mûbîn ji bo aleman rehm bû,*

*Wî perên rehmê dirêj kir û gihand welatê, yên ku edaletê dixwazin.*

*Dinya ji bo çi xwedî be, ew tev ji dana wî ne;*
*Cemîyeta wî tev jê re deyndar e, ferdê ummeta wî hemû jê re deyndar in.*

*Beşerîyet hemû ji wî mesûmî re deyndar e...*
*Ya Reb, me di mehşerê de li ser vê iqrarê heşr bike!..*

Sîreta [jînenîgarîya] serwerê pêğemberan mezinê me, Hezretê Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] her wekî behr û deryayeke fereh e; jînenîgarîya pêğemberên din jî her wekî nehr û rûbaran e, ew jî bi ser wê deryayê de dikişin. Ew bûye xwedî ji bo hemû sifetên cudakar û xesletên hemû pêğemberên ku berîya wî hatine û çûne; çi ew sifet melûm bin, çi jî mechûl bin. Bi gorî hinek rîwayetan; hijmara wan digihîje 124 hezar pêğemberan. Ew di wan sifetên cudakar û xesletên farîqe de ji wan tevan jî bûrîye û wî lûtke û zirweya exlaqên xweş û xesletên qenc pêkanîye. Wî, li ser pêşketina ku însanîyetê di bara tefekkur û jîyanê de heta bi serdema wî qeyd kiribû ev jî li wan îlawe kir; ew kesayetîya "**nimûneya îdeal**" e ku karibe heta qîyametê îhtiyacên ku ji nû ve çêbibin jî pêşwazî bike û ji wan re bibe bersiv. Ji ber vê sedemê ew wek pêxemberê axirzeman ji bo temamê însanîyetê hatiye şandin.

Ji lewma pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di bara îzahkirina sifetê exlaqî yê xwe de wiha dibêje:

“**Ez, hatime şandin ji bo exlaqê xweş temam bikim**.”[17]

Dîsa wî, ji malê dinyayê ti mîrasek li pey xwe nehiştiye ku hêja be were qeydkirin û behskirin; lêbelê wî wek çêtirîn mîras li pey xwe, ji mirovatîyê re exlaqê xweş, şexsîyeta xwe ya bêhempa û rewîştê xwe hiştiye.

17. Mûwette, Husnû’l-Xulûq, 8.

# Uswe'yê Hesene
# Mînak û Nimûna Pak

Mezinê me, Hezretê Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] di tarîxê de pêğemberê yekem û mirovê tek e ku temamê jîyana wî heta bi teferrûat û kitekiteyên hûr jî tev hatiye tesbîtkirin û qeydkirin. Bi rastî ji tekûzî û mûkemmelîyetên zincîra pêğemberan ku ew nimûneyên tek û bêhempa pêktînin, ji bo berê însanîyetê bidin xêr û heqîyê. Reftar û bizavên wan pêğemberan ji bo roja me ya halê hazir hatine guhastin; lêbelê miqdarekî tixûbdar û mûeyyen ji wan gihane me. Lêbelê pêğemberê axirzemanê jîyana wî kêlik bi kêlik û gav bi gav hatiye qeyd û tomarkirin. Hem jî bi wî awayê ku temamê kirin û gotinên wî bidin xuyakirin û nîşandan; -vêca çi yên ne mûhîm û besît bin, çi jî yên mûhîm û mezin bin-. Heyata wî di tarîxê de wek lewhe û kevalê îftîxar, şehnazî û şerefê hatine tomar û qeydkirin. Ji bilî vê jî, ev kirin û gotinên wî bi lutf û kerema Xuda Teala ji serdema wî [dirûd û silavên Xuda lê bin] ve heta bi niha hatine, gihane me û ewê bigihin heta bi însanê dawîyê yê ku berî roja qîyametê were jî.

Ji bo em karibin xwe li hemberî îbtîla, mûsîbet û surprîzan ji fitneya jîyan û heyatê biparêzin divê em exlaqên xweş û bilind ên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], di jîyana xwe de tetbîq bikin. Ew exlaqên wî yên xweş jî

ev in: Şukr, tewekkul, razîbûna bi Qederê, sebra li hemberî belayan, ezîmet, şecaet, fedakarî, qenaet, zengînîya dil, îsar, comerdî û tewazû… Divê em mûwazene û hevkêşîya xwe li hemberî hadîse û bûyeran, xirab nekin. Ji xwe çêtirîn û sipehîtirîn tetbîqata exlaqê wî jî ev e.. Lêbelê di van hemû xusûsan de nimûneyeke baş û îdeal heye. Heq Teala ew wek hedîye û dîyarî ji bo temamê beşerîyetê şandiye. Ew hedîya îlahî jî mezinê me Hezretê Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] ye. Ew bi jîyana xwe ya pak, zerîf, nezîh, nimûneyî û bêhempa ji bo însanîyetê mûrşid û rêzanê kamil e.

Heyata pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo hemû nesl û nifşên ku heta qiyametê bên nimûneyeke mûkemmel e. Qur’ana pîroz di bara wî de wiha dibêje:

“**Bêguman perûyeke bêqutbûn ji te re heye, bi rastî tu, xwedî exlaqekî mezin î.**”[18]

Sîyer û jînenîgarîya mezinê me, Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] û kesayetîya wî ya mûbarek, sirf xuyahîyên wê yên ku dikevin hundirê îdraka însên bi xwe jî zirweya menzûmeya bizav û reftarên beşerî teşkîl dike. Ew kesayetîyeke nimûneyî ya bêhempa û pêğemberekî di zirwê de ye ku erk û wezîfeya îrşadê temam kiriye û ew bi xwe wek nimûneyeke zindî û bêhempa di nav însanîyetê de dijî. Xuda Teala ew mexlûqê mûbarek û pîroz -bi vegotina Qur’anî- “**uswe’yê hesene**” yanî ew wek şexsîyeteke nimûneyî ya mûkemmeltirîn ji temamê însanîyetê re pêşkêş û teqdîm kiriye.

18. Qelem,68/3-4

Di ayeta pîroz de wiha tê gotin:

“**Sûnd be ku ji bo we, di Resûlûllah de ji bo wî yê ku Xuda û roja dawîyê hêvî dike û Xuda di bîra xwe pirr tîne, nimûneyeke sipehî û kamil heye**.”[19]

Hezretê Pêğember [dirûd û silavên Xuda lê bin] di her sefheyeke [merhele û qûnağeke] heyata xwe de ji her rexî ve sipehîtîyeke mûstesna, tekûzî û mûkemmelîyeteke cuda ji me re nîşan daye. Sipehîtîyên reftar û bizavê hemû di jîyana pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de xuya dibin. Vêca hîç ferq nake; çi ew bi awayekî yekserkî bin, çi jî ew bi awayekî kitekiteyî bin, her têde dixuyên. Ji lewma her însan, dikare ji bo xwe di heyata şerefmenda mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û sunneta wî ya senîyye de sipehîtirîn û tekûztirîn reftar û bizavan bibîne û wan ji xwe re bibijêre.

Bêşiwar pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di rêberîya dînî de nimûne ye. Ew wek serokdewlet di rêvebirî û îdarê de nimûne ye. Ew ji bo mirovên ku ketine têkilîya hezkirina îlahî jî nimûne ye. Ew dema di nîmetên Xudayê xwe de ğerq dibû jî bi şukrdarî û tewazûya [nefsbiçûkîya] xwe jî nimûne ye.

Ew di zeman û mekanên zor û zehmet de bi sebr û teslîmîyeta xwe nimûne ye. Ew di bara belavkirina ğenîmeyan de bi comerdî û îstiğna xwe nimûne ye. Ew di bara dilovanî û şefqet-kirina li ferdên aîle û malbatê de nimûne ye. Ew di bara merhemet-kirina li qels û lawazan, bêkesan, koleyan û

19. Ehzab, 33/21

bêçareyan de nimûne ye. Ew di bara efû-kirina sûckeran û mûsamehekarîya li gunehkaran jî nimûne ye:

*Heke tu mirovekî zengîn û xwedî serwet bî,* ***comerdî, tewazû*** *û nefs-biçûkîya wî pêğemberê mezin tefekkur bike!; ewê ku mezinên Ereban û ew dewlemendên ku li temamê Erebistanê zal û hukmdar bûn ji bo hezkirin û mehebbeta xwe ram û desteber kiribûn.*

*Heke tu mirovekî qels û ji peyrewan bî, hingê tu* ***heyata*** *wî pêğemberê mezin, ewê ku li Mekkê di bin îdareya mûşrikên zalim û ğasib de dijîya, ji xwe re bike nimûne!*

*Heke tu fetihkarekî serkeftî û mûzeffer bî, hingê ji heyata wî pêğemberê mezin, ewê ku di Bedr û Huneynê de bi* ***cesaret*** *û* ***teslîmîyet****a xwe zora dijminan bir û ew têkşikandin, ji xwe re îbret bigre!*

*Xuda neke, heke tu meğlûb bibî û têkbiçî, hingê tu wî pêğemberê ehlê tewekkulê bîne bîra xwe!; ewê ku ew dem, ew bi sebr û semağa xwe û bi qehremanî û mêrxasîya xwe di navbera sehabîyên şehîd-ketî û birîndar de digerîya.*

*Heke tu muellim û mamosta bî, hingê tu pêğemberê Xuda bifikre!; ewê ku li Mizgeftê feyzên zirav, tenik û bi hest, yên dilê xwe ji Eshabê Suffê re digihandin û fermanên îlahî li wan hîn dikirin.*

*Heke tu xwendekar û şagirt bî, hingê tu wî pêğemberê Xuda tesewwir bike!; ewê ku Cebraîlê Emîn wehî jê re dianî û ew jî li pêşberî wî bi* ***edeb****,* ***diqqet*** *û* ***îştiyaq*** *rûdinişt.*

*Heke tu waizekî şîretkar û murşidekî emîn bî, hingê tu bi guhdîkî li dengê şîrîn ê pêğemberê Xuda guhdarî bike!; ewê ku di hundurê Mizgefta Nebewî de ji sehabîyên xwe re sohbet dikir û ji wan re ji dilê xwe hikmet dipeşikandin.*

*Heke tu bixwazî berevanîyê ji heqîyê bikî û wê teblîğ bikî, heke tu bixwazî heqîyê bigrî û wê rakî ser pêyan, heke di vê mijarê de te, ti arîkarek jî nebe ku piştevanîya te bikin, hingê tu li jîyana pêğemberê Xuda binêre!; ewê ku li Mekka mûkerrem ji her cure arîkarîyê mehrûm bû; lê dîsa wî li hemberî zalim û sitemkaran* ***heqî*** *îlan dikir û ew ji bo hîdayetê gazî dikirin.*

*Heke tu dijmin têkbibî û pişta wî bişikînî, heke tu batil perîşan bikî û heqî îlan bikî, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di halê* ***şukrê*** *de li pêşberî çavên xwe zindî bike!; ewê ku di roja fetha Mekkê de digel ku serdarekî ğalib û serketî bû jî, lêbelê dîsa li ser pişta hêştira xwe her wekî ku biçe sicûdê wisan bi nefsbiçûkî û tewazû çû nav bajarê pîroz û mûqeddes û bi ser xwe ve neçû.*

*Heke tu mirovekî xwedî cotgeh bî, û tu bixwazî karên li wir bixî ser rê û rast bikî, tu pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] yê bi* ***dîrayet*** *ji xwe re bixe nimûne!; ewê ku piştî bû xwedî ji bo zevîyên Benû-nedr, Xeyber û Fedekê jî, dîsa wî, ew însanên ehl û pispor anîn ser kar ji bo wan* ***îslah*** *bikin û wan bi* ***awayekî baş îdare*** *bikin.*

*Heke tu mirovekî bê kes û kûs bî, tu* ***yetîmê ji nûrê*** *bîne bîra xwe!; ew pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] yê ku sêwîyê Ebdûllah û Amînê, cîgerpareyê wan û mesûm û bêgunehê tek ê wan bû.*

*Heke tu ciwanekî gihayî bî, tu bala xwe bide ser heyata wî ciwanê namzedê pêğembertîyê, ewê ku çûbû ber pezê apê xwe Ebûtalib û şivantî ji bo kerî û terş û talanê wî kiribû!*

*Heke tu bazirgan û tacir bî ku bi karwanên ticaret û bazirganîyê re derketibî ser rê, hingê tu rewşa wî zatê mezintirîn mûlaheze bike!; ewê ku di serê wan kesan de dihat ku bi karwan û qafîleyan re diçûne Şam û Yemenê.*

*Heke tu mirovekî qazî û dadger bî, hingê tu bizava* ***adil*** *û bi* ***feraset****a pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bifikre!; ewê ku dema mezinên Mekkê di xusûsa danîna Hecerê Eswed [Berê Reş] li cihê wî de dikirin lihev bixin de, wî nehiştibû di navbera wan de şerr derkeve û li nav wan haştî zal û hakim kiribû.*

*Dîsa çavê xwe li tarîxê vegerîne, li pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] binêre!; ewê ku li Medînê di Mizgefta Nebewî de rûniştibû, wî li hizûra xwe ferq û meyl nedixist navbera feqîrê destteng û zengînê xwedî mal; wî ew herdu yeksan û wekhev digirtin û wî di navbera mirovan de* ***bi awayekî adîlane hukm*** *dikir.*

*Heke tu mêr û xwedî eyal bî, li sîreta wî zatê temîz, ewê ku mêrê Hezreta Xedîce û Hezreta Aîşe bû, li* ***hissîyata*** *wî ya* ***kûr*** *û* ***şefqeta*** *wî miqate be, wî ji xwe re nimûne qebûl bike!*

*Heke tu bavê zarokan bî, tu bavê kur û keçan bî, hal û bizavên wî zatê ku bavê Fatîmetûz-Zehra û kalê Hesen û Huseyn bû, hîn bibe û wî ji xwe re bixe nimûne û rêzan!*

Sifetê te çi dibin bila bibin, tu di çi rewş û halî de dibî, bibe, sibeh-êvar di her wext û anê de tu yê mezinê me, Hezretê

Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] her ji xwe re mûkemmeltirîn mûrşid û sipehîtirîn rêber bibînî….

Ew mûrşidekî wilo ye ku tu dikarî bi wasîteya sunnetên wî her xeta û şaşîyan rast bikî… Tu dikarî karên xwe yên ku ji rêya rast ketibin dîsa bixî ser rêya rast û her karûbarên xwe îslah û çaksaz bikî.. Tu dikarî bi xêra ronahî, nûr û rêberîya wî ji asteng û asêpirsên jîyana xwe xilas bibî û saedeta rasteqîne bibînî!..

Bi rastî alema dilî û wijdanî ya wî, bexçekekî dewlemend bû, her wekî bexçekekî cennetê bû ku bi çîçekên nadîde û zerîf û gulên xwedî bêhna misk û mawerê hatibû tezyîn û bi xişrkirin.

Wekî ku hatiye dîtin, heyata mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] mûkemmeltirîn nimûne ye heta ji bo ferd û takekesên civakê yên ku di nuqteyên hevdij de digihin hev jî. Wek nimûne; heyata mehkûmekî ji bo hakimekî [dadgerekî] û heyata hakimekî jî ji bo mehkûmekî nabe mîsal û nimûne. Bi eynî awayî, heyata feqîrekî ku temamê temen û emrê xwe di têkoşîna ji bo meîşetê de derbas dike û ew di nav tinebûn û xizanîyê de kefte-leftê dike, ji bo zengînekî ku di nav destferehî û dewlemendîyê de sobaberî dike, nabe mîsal û nimûne. Lêbelê heyata mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo jîyana herdu alî û terefan jî nimûne û mînakê pêşkêş dike. Lewra cenabê Heq Teala jîyana wî ji "**sêwîtîyê**" da destpêkirin ku ew di nav civaka mirovatîyê de ji hêla eczîyet û nekarînê ve di asta jêrtirîn de ye. Bi vî awayî, ew di temamê ast û dereceyên jîyanê de derbas kir û

ew ji hêla qudret û selahîyetê ve jî derxist asta jortirîn ku ew jî reîstîya dewletê ye û ew heta bi pêğembertiyê jî bilind kiriye.

Ew dewre û pêvajoyên ku mezinê me di dirêjahîya emrê xwe de jîyane, gellek reftar û bizavên îdeal ji bo hemû tecellîyatên med-cezîr yên di jîyana însên de pêşkêş dike. Ji bo vê sedemê jîyana wî, -ast û dereceya ferdan, statûya wan û cihê wan di civakê de kîjan dibe, bila bibe- ew ji bo temamê însanan mînak û nimûneyeke pratîka mûkemmel pêktîne. Ji bo her însanî îmkan heye ku wê ji xwe re teqlîd bike û li gorî şîyan û qudreta xwe jê îstîfade bike.

**Welhasil**; ew, mezintirîn xarîqûl-adeya hunera îlahî ye ku cenabê Heq Teala bi wî kerem li mirovan kiriye û ew di nav însanîyetê de daye tecellî-kirin. Ew sipehîtirîn nimûneya îmtîsalê ye ji bo hemû mirovan; ji kîjan meslek û meşrebê bên bila bin, ji tebeqa jêrîn bigre heta bi tebeqa jorîn. Ew tekûztirîn pîvan û şehîn e, ji bo wan mûmînên ku di şexsîyeta nimûneyî ya bêhempa ya wî de kûr dibin.

❁

Ew kesên ku qaşo gotine; ew karin ji însanîyetê re rêya xilasîyê nîşan bidin û ew nimûneyeke tekûz ji bo mirovên din temsîl dikin bi taybetî jî ew fîlozofên ku hewl dane her tiştî bi eqlên xwe yên kurtebîn û têgihiştina xwe ya bêçare îzah bikin, ew di vê xusûsê de tim û daîm kêm û nuqsan in.. Lêbelê pêğember û ew salihên ku li pey rêç û şopa wan diçin, ne wisan e, wan bi rastî jî rêya xilasîyê ji mirovan re nîşan daye. Lewra pêğember, ji ber ku xwe dispêrin wehîya îlahî, ew wek rêberên hîdayetê hatine û hev û din tesdîq jî kirine. Bêşiwar temamê pêğemberan hukmên îlahî yên ku ji cem Xuda Teala

ji wan re hatine, ji mirovan re teblîğ û telqîn kirine. Wan her daîm gotiye; “Xuda wiha ferman dike”..

Hal-hal e, fîlozof digel ku ji xwe re xistine hedef û ğaye ku di rêya dîtina heqîqetê de ji mirovan re bibin rêber jî, lê ji ber ku ew ji teyîd û desteka îlahî mehrûm in û ew di bin sulte û otorîteya nefsa xwe de bi eqlê xwe yê kêm û netêr difikrin û hukm didin, wan her tim û daîm gotine û dibêjin; “Bi nêrîna min wiha ye”.. Di encama vê de rewşa wan bûye ev ku wan wiha kiriye; sîstemên hev pûç kirine, her hev û din tekzîb kirine û li derewê qulibandine. Ji ber vê, wan nekariye rêya rast û heqîqetê bibîne û nekarîne civak û komeleyên xwe jî îrşad bikin û ji wan re rêya heqîqetê nîşan bidin.

**Wek nimûne**; Arîsto, digel ku wî bingehên hinek qanûn û qaîdeyên felsefeya Exlaq danîbûn jî, lê ji ber ku ew ji wehîyê mehrûm bû, em mirovekî tenê jî nabînin ku bawerî bi felsefeya wî anîbe, ew di jîyana xwe de tetbîq kiribe û pê gihabe saedet û aramîyê. Lewra qelb û dilê fîlozofan safî nebûne, nefsên wan tezkîye û pak nebûne û fikr û fiêlên wan jî bi arîkarîya mûstesna ya wehîyê kamil nebûne, negihane.

Bêşiwar wesîleya yek û teka ku mûmkin e însan ji mûsîbet û dîyardeyên ku melekeyên zêhnî û meylên qelbî yên ku bi wehîyê nehatine paqijkirin û terbîye-kirin, bajonê, xilas bikin, “**Nebîyê Axirzeman**” û “**Heblê Metîn**” ê ku ji beşerîyetê re hatiye pêşkêşkirin. Yanî ew qulpa sağlema ku mirov xwe pê bigre, Qur’ana Pîroz e.. Mûşexxestirîn [nêrebertirîn] heqîqet û nimûneyên fiêlî yên di derûna Qur’anê de jî di sîreta zengîna mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de mewcûd in. Naxwe ji bo wî mirovê ku mecbûr e,

emaca xuliqandina xwe tehqîq bike, karê lazimtir ev e; ew îstîqameta xwe bi jêdera feyzdara Qur’an û Sunnetê dîyar bike, bi wan re hereket bike û ji ser wan jî nekeve.

Lewra Qur’ana Pîroz û Sunneta Mûtehhere, receteya seadeta dinya û axretê û bîranîna ebedî ya nûra hebûnê ne. Wî, ji me ummeta xwe re du rêberên mezin: Qur’ana Pîroz û Sunneta Mûtehhere hiştine.

Li rexê din jî, mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] berî dest bi wezîfa rîsaletê bike, wî xwe bi xelkê dabû hezkirin. Wî şexsîyeta xwe bi mûkemmelîyeteke wisan eşkere kiribû ku xelk ji mecbûrî jê re bibêjin; “**Tu Emîn û Sadiq î!**” [Tu, pêbawer î, tu rastgo yî] Wî di piştî bicihbûn û sabitbûna vê nasnameya xwe de dest bi teblîğa rîsaleta xwe kiribû.

Xelkê, heta berî pêğembertîya wî jî tebîetê sipehî yê wî, exlaqê xweş yê wî û îstîqamet û sedaqeta wî nas kiribû û jê hez kiribû. Qewmê wî bi xwe leqeb û unwana “**Emîn**” dabû wî. Dema xelkê Ke‘be saz û temîr kiribû û xelk di xusûsa li cihê wî danîna “**Hecrê Eswed**” de ketibûn îxtîlafê, ew bê îtîrazkirin ji hekemtîya wî re teslîm bûbû.

Lewra pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li ser halê sidq û durustîyeke wisan sağlem bû ku neyarên wî jî mecbûr bûn îtîraf pê bikin. Çawa ku wê dema Ebûsufyan, ewê ku hê îman bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] neanîbû û neyarekî mezin û dijwar ê wî jî bû, dema Împaratorê Bîzansê Heraklîyûs jê pirs kiribû;

“-Gelo berîya ew bibêje; ez pêğember im, we hiç ew bi derewkirinê îtham dikir?” Ebûsufyan ji bilî bibêje na! Ji xwe re ti bersiveke din nedîtibû.

Heraklîyûs jê re gotibû:

“-Hîç çêbûye ku ew li ser soza xwe nemabe?”

Ebûsufyan jê re gotibû: “Na! Lêbelê em û ew vêga di pêvajoyeke şerr-nekirinê de ne, em nizanin ka ewê têde paşê çi bike!”

Ebûsuyan dibêje; min nikarîbû ji vê peyvê pê ve tişteke din bixista navê. [20]

Ji bilî vê jî, digel ku Ebûcehl dijminekî har û dijwar ê wî bû jî, rojekê wî û hevalên xwe ji mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re gotin;

“-Ya Mûhemmed! Qesem bi Xuda ye, em te naderewînin! Lewra tu li cem me mirovekî rastgo û durust î. Lêbelê em wehîya ku te anîye diderewînin.” Ev jî nîşan dide ka Erebên cahilîyetê çi qeder îtîmad li mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dikirin.

Vêca di bara vê hadîse û rûdanê de ev ayeta pîroz hate nazilkirin û şandin:

“**Bêşiwar em dizanin ku gotina wan te ğemgîn dike; bi rastî, ne ku ew te diderewînin; lêbelê ew zalim ayetên Xuda înkar dikin**.”[21]

---

20. Buxarî, Bed’ul-Wehîy, 6, Selat, 1, Sedaqet 28; Muslim, Cîhad 74.
21. Enam, 6/33.

Yanî dijminê wî yên ji hemû dijminan hartir û dijwartir jî digel ku bi wijdana xwe qebûl dikirin ku mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pêğemberekî heq e jî; lêbelê dîsa sirf bi sebeb nefsanîyeta xwe ew bi eşkerehî qebûl nedikirin.

Yek ji wan bûyer û hadîseyên ku rohnîyê dixe ser sebebên ku heta bi mûşrikan bi xwe jî ji wî siltanê alemê re "**Mûhemmed'ul-Emîn**" [ewê ku her kes ji destê wî û zimanê wî di ewlehî û hizûrê de ye] gotine, ev hadîsa ha ye:

Di wan rojên cenga Xeyberê de ji nav rêz û sefên cihûyan şivanek bi navê **Yesar** hate cem mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Piştî demekê pê re sohbet kir, ew misliman bû û xwest bigihîje mislimanan. Lêbelê Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got; pêşî mêşinan li xwediyê wan vegerîne, piştre were bigihîje me.[22] Hem jî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di demeke wisan de ev jê re gotibû ku têde şerr dirêj bûbû û di nav mislimanan de jî tengasîya qût û xurekê peyda bûbû, yanî îhtiyaca wan bi wan mêşinan zehf hebû...

Bêşiwar ev ferman, mîsaleke zehf manedar e ku nîşan dide; çi qeder mirov di zemanê zor û zehmet de be jî, dîsa her divê mirov hest bi berpirsî, mesûlîyet û wezîfeye xwe bike û ehemmîyet û giringîyê bi rîayetkirina emanetan bide.

Em dişên îstîfadeya heqîqî ji exlaqê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û hal û rewa wî bikin, dema

22. Îbn-hîşam, Sîretun-Nebî,Beyrût, 1937, Dar'ul-Fikr, III, 397-398; Îbn-hecer, el-Îsabe, Beyrût, 1328, Daru Îhyai't-Turasi'l-Erebî, I, 38-39.

em ji hadîsa Îsra û Mîracê dersekê wergirin. Lewra hal û rewşa teslîmîyet û tesdîqê, Hezretê Ebûbekr [Xuda jê razî be] gihandibû vê gotina wî ya nemir;

“-Heke wî gotibe, rast e!”

Bêguman ew xuyahîyên edalet, rehm û şefqetê yên ku di heyata mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de hebûn û ne mûmkin e ku mirov bikare wan bijimêre, ew heta bi roja qîyametê jî ji bo temamê cîhanê nimûneyeke îdeal temsîl dikin. Ti çavekî bi însaf yê ku nûra berraqa wî seyr û temaşe kiribe, ew nûra ku ji qendîla bêhempa ya wî ronahî daye ser alemê, nikare heqîqeta wî -bi kêmasî ji hêla wijdanî ve- înkar bike. Wekî ku me dîtiye, gellek ji erbabê îlmê yên bîyanî, ewên ku xwediyê eqlê selîm in, bi wijdana xwe mezinatî û serkeftina mezinê me, Hezretê Mûhemmed pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tesdîq kirine.

Yek ji van însafmendan jî **Thomas Carlyle** wiha dibêje:

“Derketina wî, xeritandina ronahîyê ji tarîtîyê bû.”

Di ansîklopedîya navdara bi navê “**Ana Brîtannica**” de wekî ku fezîletên mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tesdîq bike, ev cumleyên ha nivîsandî ne:

“Ew serkeftina ku Mûhemmed gihayê, di dirêjahîya tarîxa însanîyetê de ne pêğemberek, ne çaksazek [îslahkar û reformîstek] ne jî zilamekî dîn gihayîyê.”

**B. Smith** dibêje:

“Mûhemmed, bê qeyd û şert û bi îttîfaq, mezinê hemû îslahatkaran e.”

Nivîser **Stanley Lane-Polo** vê heqîqetê îtîraf dike:

"Wê roja ku Mûhemmed mezintirîn ğalibîyet li dijî dijminên xwe qezenc kir, di eynî zemanî de wî wê rojê mezintirîn serkeftina fezîletê jî qezenc kir. Roja ku wî Mekke fetih kir, wî bê ti hemberekî ji wan wergire, Qureyşî serbest berdan û wî ev kire lêborîn û efûyeke giştî û kir ku hemû xelkê Mekke bi ber wê bikeve."

Nivîser **Arthur Gilman** jî dibêje:

"Em di fetha Mekkê de ulwîbûna [alîcenab-bûna] wî temaşe dikin. Tesîra neqencîyên ku di rabûrîyê de li hemberî wan kiribûn, dikarîbû bike ku ew tolê li wan veke û întîqamê ji wan hilîne. Lêbelê Hezretê Mûhemmed nehişt artêşa wî ti awa û cureyeke xwînê birijîne. Wî şefqeteke mezin nîşan da û ji Xuda re şukr kir."

Fîlozof **La Fayette**, ewê ku yek ji wan kesan bû ku bingehên fikr û ramanî yên îhtîlala Fransizan di 1789'an de hazir kiribû, berî "**Beyan-nameya Mafên Mirovan**" a meşhûr were weşandin, wî temamê sîstemên hiqûqan tedqîq kiribûn, çêtirbûn û serdestîya hiqûqê îslamê dîtibû û wiha qêrîyabû:

"Ey Mûhemmedê navdar! Tu, di edaletê de gihayî zirweyeke wisan ku heta îro ji bo ti kesî mûmkin nebûye ku ew bigihîje wê û ji vêga û pê de jî ewê ji bo ti kesî mûmkin nebe!.."[23]

Ha fezîleta eslî ew e ku dijminê wî mecbûr bimîne heqê wî teslîm bike, çêtirbûn û serdestîya wî tesdîq bike û bilindbûna

23. Binêrin; Kamil Mîeas, Wergera Tecrîda Serîhê, Ankara 1972, IX, 289.

wî îtîraf bike!... Heta bi mirovên ku îman pê neanîbûn jî fezîlet û dîrayeta Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] her tesdîq kirine...

Lewra sîreta mûstesna ya mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew mûkemmelîyeta exlaqî di xwe de kom kiriye ku pê karibe bersivên cuda cuda ji bo her karên cuda cuda bide. Wî xal û nuqteya esasî ji bo perwerdekirina hemû însanên li sererdê pêkanîye. Wî, nûr li rêya mirovên ku li ronahî û nûrê digerin weşandiye. Hîdayeta wî, ronahîyeke rohnîker û şaşneber e, ji bo her kesên ku li rêya rast digerin. Ew, ji bo temamê beşerîyetê mezintirîn mûrşid û rêzan e.

Heleqeyên ders û îrşadê yên wî, komkar û berfereh bûn, her wekî kullîyekekê bûn; hemû çînî û sinifên mirovan li dora xwe kom dikirin. Hemû millet, digel cuda cudabûna zimanên xwe, rengên xwe û çînî û sinifên xwe, hem jî digel curecurbûna rewşên xwe yên civakî û texlît texlîtbûna çand û kulturên xwe jî tev li wir kom dibûn û dibûn yek. Hîç ti qeyd û tomarek nîn e ku nehiştibe ti însanek biçe wir. Ew der, ne ji bo qewmekî tenê bû, ew der navend û merkezeke îlm û îrfanê bû; wê her însan sirf ji ber însanbûna wî tenê dixist ber dest û vekolînê. Li wir, ji hêla heq û edaletê ve di navbera mirovên qels û xurt û zengîn û feqîr de ti ferq û cudahîyek nebû..

De li peyrew û hevalbendên mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] binêrin; hûnê di nav wan de mirovên curecur û şexsîyetên mûmtaz yên wekî qralê Hebeşistanê Necaşî, mezinê Mean Ferwe, serekê Hîmyeran Zulkîle, Fîrûzê Deylemî, yek ji mezinên yemenîyan

Merakebûd û yek ji walîyên Ummanê jî Ûbeyd û Cafer bibînin..

Heke hûn careke din dubare li wan temaşe bikin, hûnê li kêleka van hukmdar û rêvebiran mirovên bêkes û bêkûs yên her wekî Bîlal, Yasir, Suheyb, Xebbab, Emmar, Ebû-fûqeyhe û yên wekî wan; carîye û jinên bê serdar û parêz yên her wekî Sumeyye, Lubeyne, Zinnîre, Nehdîye û Ummû-abis jî bibînin..

Çawa di nav sehabîyên kîram yên wî de mirovên zehf biaqil, fikr-rewşen û dîtin-nêrîn bi-îsabet hebûn, eynî wilo mirovên ku ji bo karên hûrtirîn layiq, mirovên ji bo gellek sirr û hikmetan waqif û mirovên ku welat bi liyaqet û dîrayet îdare dikirin jî, hebûn..

Peyrew û hevalbendên mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] şehr û bajar birêve birin û hukm li wîlayetan kirin. Însan bi xêra wan gihan seadet û hizûrê. Ji zewqa edaletê t‘em xwarin. Wan li nav xelkê selamet û aramî belav û hakim kir. Wan însan her wekî bira bi hev dan hezkirin û dan kelijandin…

# Exlaqê Bilind Ê Hezretê Pêğember

Di dirêjahîya tarîxê de ji bilî mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ne mûmkin e, mirov şexsekî duduyan bibîne ku ji her alîyên jîyana wî re elaqe hatibe nîşandan, hemû xusûsîyet û taybetmendîyên hûrehûr yên wî hatibin tesbîtkirin û hûrkolîn li serê hatibe kirin. Heke mirov hewl bide û lê bixebite da ku hemû mijar û xusûsên ku şexsîyeta nimûneyî ya mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pêktînin, vebêje, hingê bi cildan kitêb têra wê nakin.

Îlmên îslamî di nuqteya **ness**[24] û **îctîhad**ê[25] de alîyên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] yên curecur ji xwe re kirine delîl. Ji ber vê sedemê her alîyekî jîyana mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji terefê şağ û tayên curecur ên îlmê ve cuda cuda xistine ber behs û vekolînê û hewldane wê bikarbînin.

---

24. Ev bingeha ku Îlmên Îslamî xwe dispêrinê û ew bi vegotina “**Ness**” tê îfadekirin **Qur’an** û **Sunnet** e. Sunnet, hal û bizavên mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] yên qewlî, fiêlî û teqrîrî ne. Di xusûsên ku Qur’an û Sunnetê bi eşkerehî hukm ji wan re danîbin de hîç îctîhad çênabe.
25. **Îctîhad** ew e; mûctehid, li gorî hinek usûlên dîyarkirî û dîsa bi awayekî ku bi naveroka Qur’an û Sunnetê re ahengsaz be, di wan mijarên ku Qur’an û Sunnetê bi eşkerehî hukm ji wan re beyan nekiribe de meseleyan çareser bike.

Çawa ku ji berî 1400 û çend salan ve hemû berhem û eserên îslamî yên ku hatine te'lîfkirin û nivîsandin, her hewldane ku kitêbekê, yanî Qur'ana Pîroz û însanekî, yanî mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] îzah bikin.

Ji xwe ne mûmkin e, em bikarin bi taqet û amadekarîya xwe ya beşerî bi awayekî tekûz û kamil mezinê xwe, Fexrê Kaînatê, yê ku xarîqûl-adeyeke aferandinê ye, fehm bikin. Lewra întîba û çavdêrîyên ku ji vê alemê hatine wergirtin ji bo îzah û îdrak-kirina wî têrê nakin. Çawa ne mûmkin e, mirov bikare ummanekê [okyanûsekê] bixe nava qedeh û îstîkanekê, eynî wilo ne mûmkin e, mirov bikare bi awayekî layiq û durust Nûra Mûhemmedî jî îdrak û fehm bike.

Emê li vir, bi qasî îdrak û têgihiştina xwe hewl didin ji nav wan mîsalên ku di rêya nasandina şexsîyeta nimûneyî ya pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de ummanekê [okûyanûsekê] pêktînin, çend nimûneyan eşkere û erz bikin.

**Xweşikbûna Sîma û Exlaqê Pêğemberê Xuda**

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xwedî wicûdeke mûbarek bû, mexlûqekî din wekî wî nehatiye xuliqandin, sûret û sîmayê wî xweşik û sîreta wî jî mûkemmel bû. Ne mûmkin e, mirov karibe bi awayekî layiq û durust mûkemmelîyeta sûret û sîreta wî îfade bike.

Di vê xusûsê de Îmam Qurtûbî wiha dibêje:

"Husn û cemala mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi awayekî temamî xuya nebûye. Heke hemû xweşikî û sipehîtîyên wî bi heqîqeta xwe hatibûna xuyakirin, sehabîyên wî nedikarîn lê meyzînin."[26]

Bi rastî ji nav sehabîyên ku tim û daîm bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re bûn jî, ji ber tore û edeba xwe kêm kesan ji wan kariye têr têr li husn û cemala nûra wî seyr û temaşe bikin. Heta hatiye rîwayetkirin; ji bilî Hezretê Ebûbekr û Hezretê Ûmer, sehabîyên din di dema sohbetê de jî li pêşîya xwe dimeyzandin, bes van herdu sehabîyan karîbûn bi çavên xwe li pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] meyzînin. Wan li mezinê me yê mûhterem û rêzdar dimeyzand û tebessum dikir, mezinê me Fexrê Kaînatê jî li wan dimeyzand û tebessum dikir.[27]

'Emr kurê As, fatihê Misrê di dawîya emrê xwe de ev rewş wiha anîye zimên:

"*Ez, demeke dûv-dirêj bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re mam. Lêbelê ji ber heya'ya ku min li hizûra wî his dikir û tezîm û xatirê mezin ê ku min di dilê xwe de jê re digirt, min nekarî serê xwe rakim û têr têr li rûyê bi nûr û mûbarek ê wî seyr bikim. Heke îro ji min re bibêjin; «wesfê Resûlûllah ji me re bide, wî vebêje» ji min bawer bikim; ez nikarim wî ji we re vebêjim.*"[28]

---

26. Alî Yardim, Peygamberimiz'in Şemaili, Îstanbul, 1998, s. 49.
27. Tirmizî, Menaqib, 16/3668
28. Muslim, Îman, 192 - Hem ji bilî wê, li Musneda Ehmed Bin Henbel, Îstanbul 1992, IV, 199, binêrin.

Rûyê mûbarek ê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], yê ku îtîmad û hizûr dida mirovên hawîrdora xwe, ji hemû rû û çehreyan sipehîtir û temîztir bû. Ebdûllah kurê Selam ku yek ji aliman cihûyan bû, dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hicret kiribû, hatibû Medînê, ew bi meraq hatibû cemê, çi dema li wechê mûbarek ê wî meyzand bû, gotibû; "*ev rû hîç derewan nake!*" û misliman bûbû.[29]

Lewra sipehîtî, heybet, nûranîyet û letafeta di wî de di ast û dereceyeke ew qeder mûcîzeyî de bû ku ji bo nîşandana ku ew pêğemberê Xuda ye, êdî îhtiyac bi ti delîl û burhaneke din nehiştibû.

Dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tiştek arzû nedikir û ew li xweşîya wî nediçû, di cih de wê xwe di sîmayê wî de şanî dida. Her wiha dema wî tiştek dieciband û jê hez dikir jî memnûnîyeta wî dihat hiskirin.

Di cismê nezîfane'yê wî de zindîtî, heya'ya [şermokîya] zehf zêde û ezimeke pirr mudhiş pev re kom dibûn. Ne mûmkin e, mirov bikare kûrbûna rîqqet û tenikbûna qelb û dilê wî îzah bike.

Heta tu bibêje bes, di rûyê wî de nûra melahetê, di xeberdanê wî de selaset [herkbarî], di hereket û bizavên wî de letafet, di lîsanê wî de telaqet, di peyv û kelîmeyên wî de fesahet û di beyan û vegotina wî de belağeteke fewqel-ade [awerte û zêdeyî adetê] hebû..

29. Tirmizî, Qiyame, 42/2485; Ehmed, V, 451

Wî xeberdana fizûlî [zêde] nedikir, her peyva wî hikmet û nesîhet bû. Di luğet û ferhenga wî gotegot û malayanî [tişta ku mirov elaqedar nedikir] nebû. Wî bi her kesî re, bi qasî eql û îdraka wî, xeber dida.

Ew mirovekî mulayîm û mûtewazî bû. Di kenê wî qehqehe û zêdegavî nebû. Ew tim û daîm rûken û devliken bû.

Mirovê ku ew ji nişka ve didît, jê saw digirt. Mirovê ku pê re axaftina bi ulfet û sohbet dikir, ew ji dil û can jê re dibû dost û aşiq.

Wî, bi qasî dereceya wan rêz û hurmet ji ehlê fezîletê re digirt. Wî zêde zêde xatirê eqreba û lêzimên xwe digirt û qedr û qîmet dida wan. Wî çawa danûstan û mûameleya baş bi ehlê mala xwe û sehabîyên xwe re dikir, eynî wisan wî bi rifq û lutf mûameleya baş bi însanên din re jî dikir.

Wî zehf zêde qedr û qîmet dida çakar û xizmetkarên xwe; wî çi xwarin dixwar û çi cil li xwe dikir, ji wê xwarinê bi wan jî dida xwarin û ji wan cilan li wan jî dida kirin. Ew mirovekî comerd, xwedî kerem, bi şefqet, merhemet û dilovan bû. Dema pêdivî pê hebûya, ew zehf cesûr û dilawer bû, dîsa dema pêdivî pê hebûya ew zehf berbuhêr û helîm bû jî.

Ji xwe ne mûmkin e, mirov bikare bi awayekî layiq û durust dereceya sexawet, comerdî û kerema wî teqdîr û beyan bike. Lê mirov dikare di bara merdîya wî de vê qasê bibêje; comerdîya wî, ji comerdîya wî kesê ku ji feqîrtîyê hîç natirse, zehf zêdetir bûye.

Hezretê Cabir [Xuda jê razî be] di bara wî de wiha dibêje:

“*Dema tiştek jê hatibe xwestin, wî hîç negotiye; na!*”[30]

Ew kesekî wisan bû ku ji her kesî bêhtir diçû serdana xizm û eqrebayên xwe. Wî ji her kesî zehftir şefqet û merhemet li xelk û ewaman dikir. Wî ji her kesî pirrtir mûameleya xweş bi mirovan re dikir. Wî ji her kesî bêhtir xwe ji exlaqê ne xweş diparast. Ew ji her kesî zehftir xwedî edeba baş û exlaqê xweş bû.

Wî digot:

“*Roja qîyametê di terazîya mûmînî de tiştekî ji exlaqê xweş girantir nîn e. Xuda Teala ji mirovê ku hereketên kirh dike û xeberdanê pîs dike, hez nake.*”[31]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di ehd û we‘da xwe de sabit û di gotina xwe de sadiq û durust bû. Ew ji hêla exlaq, eql û zekawetê ve ji hemû mirovan çêtir, exlaq xweştir, biaqiltir û jîrtir bû. Ew ji bo her cure medh û senayan layiq bûye.

Huzn û ğemgînîya wî daîmî û tefekkura wî bênavber bû. Heke ne zerûrî bûya, wî hîç xeber nedida. Huşbûna [xeber nedana] wî zehf dirêj dewam dikir. Dema wî dest bi axaftinekê dikir, ew di nîvî de nedihişt; lê ew temam dikir. Wî gellek mane di çend peyvan de berhev dikirin û ew wisan digotin. Yanî ew peyv komkar bû. Peyvên wî yeko yeko bûn. Ne ji lizûmê zêdetir bûn, ne jî ji îhtiyacê kêmtir bûn. Digel ku ew bi xulqîyeta xwe mirovekî nerm bû jî; lêbelê dîsa heta tu bibêjî bes, ew bi giranî  û heybet bûye.

30. Muslim, Fedail, 56
31. Tirmizî, Birr, 62/2002

Ew ji bo nefsa xwe bi xwe hîç hêrs nebû; lêbelê dema îtîraz li heqîyê dihat kirin, yan jî heqî dihat binpê-kirin hingê ew zehf hêrs dibû. Dema heqî dihat binpêkirin, heta heqî nehata cihê xwe hêrsa wî berdewam dikir. Lêbelê dema heqî bi heq dibû û dihat cihê xwe, hingê di cih de sikût û aramî li ser wî zal dibû. Wî, di bara tişteke bi şexsê xwe re elaqedar de berevanî ji xwe nedikir û bi ti kesî re nediket nîqaş û pevçûnê.

Heta wî destûr ji xwediyê malekê nexwesta, ew bêîzn nediçû wê malê. Dema ew dihate hundurê xanîyê seadeta xwe jî, muddetê mana xwe ya li malê dikir sê qism; qismek ji bo îbadetkirina ji Xudayê xwe re. Qismek ji bo derbaskirina bi malbata xwe re û qismê sisêyan jî ji bo şexsê xwe vediqetend. Wî, ew zemanê xwe yê ku ji bo şexsê xwe veqetandibû jî, ew ji bo ewam û xewasan yanî ji bo her kesî texsîs û terxan dikir û ti kes ji wan ji xwe mehrûm nedikir. Wî dilê wan tevan feth dikir.

Ew li her deverên mizgeftê rûdinişt, ji bo bi adetkirina rûniştinê ya li cihekî diyarkirî men bike. Lewra wî dil nebû qudsîyetê bi ti mekan û meqaman bide. Wî nedixwest helwest û wezîyeteke malûm li mizgeftan bigre, ji bo bi vî awayî, ew nebe sersedemê tekebbur û xwe-mezinkirinê. Dema ew dihat dîwanekê, kûder vala mabû, ew li wir rûdinişt û wî ji her kesî dixwest ku ew jî wekî wî bikin.

Dema kesekî îhtiyaceke xwe jê dixwest, hedana wî nedihat heta paşê ew jê re temîn dikir. Hîç ferq nedikir; çi ew îhtiyac mûhîm bûya, çi jî ew ne mûhîm bûya, çi ew mezin bûya, çi jî ew besît bûya. Dema wî nedikarî wê îhtiyaca wî temîn bike jî dîsa ew destevala nedişand; lêbelê dilê wî bi

xebereke xweş her ji xwe razî dikir. Ew, ji bo her kesî hevğem bû. Însan hemû, cih û meqamê wan di nav civakê de çi dibû, bila bibûya, dixwaze bila feqîr, yan zengîn bûya, yan jî alim, yan jî cahil bûya, her ji ber însanbûna xwe ew tev li cem wî wekhev û yeksan bûn û mûameleyeke wekhev didîtin. Hemû cihê rûniştinên wî, cihê tetbîqkirin û serwerkirina fezîletên her wekî; helîmtî, zanîn, heya, sebr, tewekkul û emanetê bûn.

Wî, ji ber eyb û kêmasîyên ti kesî ew şermezar nedikir, dema îhtiyac bi îqaz û şîyarkirina wî didît jî, bi awayekî ku mirovê li pêşberî xwe rencîde neke, îqaza xwe bi îma û îşareteke zerîf, îşaret dikir. Ew bi eyb û kêmasîyên şexsekî yên ku hê jê xuya nebûbûn re meşğûl nedibû û wî bi tundî hûrkolîna hinek rewş û halê mirovan jî men û qedeğe dikir.

Mezinê me Fexrê kaînatê li ser meseleyên ku sewaba wan hêvî dikir xeber dida û ew li ser meseleyên li derveyê wan nedipeyivî. Dîwanên sohbeta wî di nav wecd û mehebbetê de bûn. Dema ew diaxivî, mirovên li hawîrdora wî wilo jê re dibûn heyran û bi guhdîkî lê guhdarî dikirin. Sehabîyên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî, ew halê edeb û hizûra ku di sohbeta wî de ew dixistin bin perda xwe jî wiha îfade kirine:

"Em wilo bi sikûnet dirûniştin her wekî ku teyrek li ser serê me hebe, vêca ku em xwe tev bidin, ewê bifire û here."[32]

Edeb û heya'ya pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ewqas xwe di sehabîyên wî de dida xuyakirin ku û giranîyeke mezin ji wan re çêdikir; êdî wan bi pirranî cur'et

32. Ebûdawud, Sunen, 23-24/4753

nedikir û newêrîbûn pirsan jê bikin. Ji ber vê yekê, wan di dilê xwe de ji xwe re digot; xwezî koçerek ji çolê were, pirsan ji Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bike û ji bo sohbetkirina wî bibe wesîle, vêca em jî ji feyz û rûhanîyeta wî îstîfade bikin.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di dirêjahîya heyata xwe tevî de her wekî abîdeyeke semîmîyetê bû. Çi di dilê wî de hebû, wî ew digot, çi di dilê wî de nebû, wî ew nedigot. Ew, bi exlaqê xwe her wekî ku Qur'aneke zindî û candar bû. Tişta ku wî bi xwe nekiriba, ji ğeyrê xwe re jî nedigot, wê bikin.[33]

**Tewazûya/Nefsbiçûkîya Resûlê Xuda**

Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] di zemanekî zehf kurt û ne-dirêj de ewqas îmkan û derfet ketin destê wî ku li dinyayê ne mûmkin e, ew bikevin destê ti padîşah û qralekî. Digel ku wî, wek seyda û perwerdekarekî îdeal dilê mirovan fetih kiribû jî, lê dîsa wî berê xwe neda van nîmetên mezin ê dinyayê; ewên ku li ber lingên wî hatibûn raxistin û danîn û wî li ser wê heyata xwe ya mûtewazîya berê berdewam kir.. Wî, her wekî berê jîyana xwe bi awayekî sade û feqîrane di wê odeya xwe ya ku ji kelpîçan hatibû lêkirin de berdewam kir. Ew, li ser şîltekê radiza ku ew ji pelên qesb û xurmeyan hatibû dagirtin. Wî cil û bergên besît li xwe dikirin. Ew heyateke wisan sade û feqîr dijîya ku ji heyata mirovên feqîr

33. Li Îbn-Se'd, et-Tebeqatul Kubra, Beyrût, Daru Sadir, I, 121, 365, 422-425; Heysemî, Mecmeuz-Zewaîd, Beyrût, 1988, IX, 13, binêrin.

û zeîf jî hê hejartir bû. Carina jî dema wî tiştek peyda nedikir ku bixwe, ji Rebbê xwe re şukr dikir û kevir dixist ber zikê xwe ji bo birçîbûna xwe ji bîr bike. Digel ku hemû gunehên wî hatibûn efûkirin jî, dîsa wî li ser tobekirin, şukr û nîyaza xwe her dewam kir. Wî, bi şev ewqas nimêj dikir heta ku lingên wî diwerimîn. Ew, bi îmdad û hewara mezlûman ve her diçû. Ew ji bo sêwî, bêkes û ğerîban tesellî û hedan bû. Ew digel mezinbûna xwe jî bizzat, bi mirovên bêçaretirîn re meşğûl bûye. Wî, bi şefqet û merhemeta fereha xwe ew hîn bêhtir hemêz dikirin û bask û milên xwe ji wan re vedikirin.

Roja fetha Mekkê, dema însanan ew mezintirîn hêz û qeweta ku di heyata xwe de çav pê ketibûn, dîtin,  tirs û xewfeke zêde kete dilê wan, ew ji sawê lerzîn, diranên wan dikirin şingeşing, li hev diketin û ew hevbajarîyên wî hatin jê re gotin:

"-Ya Resûlellah, îslamê li min hîn bike!" Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] destpê kir îslam li wî hîn dikir, wî ji wê dema ku îmkanên wî zehf zeîf bûn ev nimûne vegot, aramî û sikûnet jê re telqîn kir û wiha pêde çû:

"-Birayê min, sakin bibe! Ez ne kral û hukmdar im. [Dêya xwe ya muhterem qesd kir û got;] ez kurê jinekê me, ku wê goştê li ber taverojê hatî hişk-kirin dixwar. Ez sêwîyê cîranê te, yê berê me!.."[34] Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi van peyvên xwe zirweya tewazû û nefsbiçûkatîyê hedîye kiriye, ewa ku di tarîxê de ji bo mezinekî ne mûmkin e, bigihîje axa binpîyê wê jî.

34. Li Îbnmace, et'îme, 30; Teberanî, el-Mûc'meul Ewset, II, 64'an binêrin!

Dîsa di eynî rojê de, dema Hezretê Ebûbekrê Siddîq bavê xwe yê pîr da pişta xwe û anî hizûra pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], jê xwest ku îmanê jê re telqîn bike. Wî ji bo Yarê xwe yê Ğarê[35] fezîleta bersivdana wî nîşan da û jê re wiha got:

"-Ya Ebûbekr! Te çima ev bavê xwe yê yextiyar heta bi vir anî û westand? Ma me nikarîbû here cemê?!"[36]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] her tim zanîbû ku ew mirovekî bêçare ye û wî halê xwe wiha îlan dikir:

"**Ez jî însanek im, wekî we. Lêbelê wehî ji min re tê şandin**."[37]

Wî, bi taybetî û israr peyva "**ebdûhû=evdê Xuda**" li pêşîya hevoka tesdîqkirina resûltîya xwe îlawe dikir, wî bi vî awayî ummeta xwe ji ketina rêşaşîya wan milletên ku berê ketibûnê, mûhafeze dikir.

Wî, ew însanên ku ew zêde mezin dikirin jî wiha şîyar dikirin û ji wan re digot:

"*Hûn min, ji dereceya min zêdetir bilind nekin, nefirînin! Lewra Xuda Teala berî min ji xwe re bike «**resûl**», ez ji xwe re kiribûm «**evd**».*"[38]

---

35. Bi meneya "dostê şikeftê" tê û ew wê hevaltîya mezinê me Nûra Hebûnê û Hezretê Ebûbekrê Siddîq ya di Şikefta Sewrê de îfade dike.
36. Li Ehmed, vI, 349; Heysemî VI, 174; Îbn Se'd, V, 451'ê binêrin!
37. Kehf, 18/110
38. Heysemî, IX, 21

Bi navê Ğerra firağeke pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hebû ku çar zilaman karîbû wê hilgire û bibe. Çi dema danê sibehê hat û ew ji bo nimêja tavê jî çûn sicûdê, ev firağa xwarinê jê re anîn û têde avedohnek hebû. Wan sehabîyên kîram xwe li dora wê da hev, çi dema ew li serê zehf bûn, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li ser çokê xwe rûnişt, bedewîyekî jê re got;

“-ev çi rûniştin e?!”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

“-*Xuda ez kirime evdekî camêr; ez ne kirime înadkarekî zordar!*”[39]

Yanî wî eşkere got; ez bi ti awayan wekî însanên qure û serxweveçûyî hereket nakim.

Dîsa wî careke din gotibû:

“-*Ti kes bi emel û îbadetê xwe naçe cennetê!*”

Sehabîyên kîram bi heyret jê pirs kiribûn û jê re gotibûn:

“-*Ma tu jî, ya Resûlellah?*”

Wî ji wan re gotibû:

“*Erê, ez jî!.. Meger ku lutfa îlahî ya Rebbê min bi hewara min ve bigihe, ew cuda ye!.. Lewra ez jî naçim cennetê, heta ku kerem, rehm û meğfîreta wî xwe li min nepêçe û min nexe nava xwe! Emelên ku ez dikim ew min jî xilas nakin!..*”[40]

39. Ebûdawud, Et‘îme, 17/3773
40. Buxarî, Rîqaq, 18; Muslim, Munafîqûn, 71-72; Îbnmace, Zuhd, 20; Darimî, Rîqaq, 24

Dîsa Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ummeta xwe ji ezabê agirê cehennemê şîyar dike û ji wan re wiha dibêje: “*Kî, cilan ji bo kubartî, xwe-qurekirin û xwe ecibandinê li xwe bike, ewê roja qiyametê jî cilê riswatîyê li xwe bike*.”

Di vê xusûsê de hinek ji hedîsên şerîf wiha ne:

“*Ewê ku ji kubartî daw û devlingên cilên xwe heta bi erdê berdide û kaş dike, Xuda roja qiyametê li wî nameyzîne*.”[41]

“*Kî li dinyayê cilê şohretê li xwe bike, Xuda roja qiyametê cilê zilletê li wî dike, paşê jî agir têde pêdixe*.”[42]

Dîsa mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], heta ğenîmeyên para xwe jî bilez belav dikirin û wî jî her wekî jartirîn takekes û ferdên ummeta xwe jiyaneke mûtewazî derbas dikir.

## Comerdîya Pêğemberê Xuda

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pesnê xwe wiha dida û digot; “ez bi xwe memûr û fermanberê înfaqê me. Xuda Teala xwediyê her tiştî ye û ew her tiştî dide.”

Sefwan kurê Umeyye yek ji giregirên Qureyşîyan bû, digel ku ew hê misliman nebûbû jî lêbelê di Ğezwa Taîf û Huneynê de beşdar bûbû û li cem pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] cih girtibû.

41. Buxarî, Lîbas, 1, 5
42. Îbnmace, Lîbas, 24

Ew li Cî‘ranê bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re bû. Dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di navbera ğenîmeyan de digerîya û li wan dimeyzand, dît ku wa ye, Sefwan bi heyret û dilbijênî li hinekî ji wan malê ğenîmê dinêre, vêca jê re got:

“-Ma ew zehf li xweşîya te çûn?” Wî jê re got; “Erê.”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

“-*Raje wan, bila ew tev ji te re bin*!”

Vêca Sefwan li hemberî vê comerdîya wî hew xwe girt û got; “ji bilî qelbê Pêğember ti qelbekî din ev qas comerd nabe..” şehda xwe anî, got; ez bi devê xwe dibêjim û bi dilê xwe yeqîn bawer dikim ku ji Xuda pê ve ti îlahê bi heqîyê nîn in û Mûhemmed jî evdê wî û pêğemberê wî ye.” û ew misliman bû.[43]

Çi dema ew vegerîya û çû nav êla xwe, ji wan re wiha got;

“-Gelê qewmê min! Zû misliman bibin! Lewra Mûhemmed comerdîyeke wisan dike her wekî comerdîya wî kesê ku hîç ji feqîrtîyê natirse.”[44]

Dîsa yek hat û tiştek ji mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xwest. Wê wextê tiştek li ber destê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nebû ku bide wî. Vêca pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê

43. Waqidî, Meğazî, Beyrût 1989, II, 854-855.
44. Muslim, Fedaîl, 57-58; Ehmed, III, 107

bin] jê re soz da û got; here, ji bo îhtiyaca xwe deyn bike, ezê wî deynê te bidim.[45] [46]

Wî jî wekî kalê xwe Îbrahîm [silavên Xuda lê bin] ti xwarinek bêyî mêhvanan, bi tena serê xwe nedixwar. Deynê mirîyan dida edakirin, yan jî wî bi xwe ew eda dikirin. Heta deynê wan nehatibana edakirin, wî li ser mirîyan nimêja cenaze nedikir.

Wî di hedîseke şerîf de wiha gotiye:

“*Însanê comerd ji Xuda nêzîk e, ji cennetê nêzîk e, ji mirovan nêzîk e; ji agirê cehennemê dûr e. Însanê nemerd jî ji Xuda dûr e, ji cennetê dûr e, ji mirovan dûr e; ji agirê cehennemê nêzîk e!..*”[47]

Di hedîseke şerîfa din de jî wiha gotiye:

“*Di mûmînê heqîqî de ev herdu xeslet hîç pev re kom nabin: Qesîsî û exlaqê xirab!..*”[48]

**Teqwa Pêğemberê Xuda**

Ew ji hemû mirovan mûtteqîtir bû. Wî, ji cenabê Heq Teala dixwest ku teqwayê jê re bexş bike û wiha jê lavlav dikir:

---

45. Heysemî, X, 242
46. Ebûdawud, Xerac, 33-35/3055; Îbnû-Hibban, Sehîh, Beyrût, 1993, XIV, 262-264”ê binêrin!
47. Tirmizî, Birr, 40/1961
48. Tirmizî, Birr, 40/1962

"*Xudayê min! Teqwadarîya nefsa min bidiyê û wê tezkîye bike! Tu ji bo tezkîye-kirina wê ji her kesan çêtir î. Lewra tu welîyê wê yî, tu xwediyê wê yî.*"[49]

"*Xudayê min! Ez, ji te hîdayet, teqwa, îffet û zengînîya dil, dixwazim.*"[50]

Mezinê me, bi sedem teqwadarîya xwe wekî feqîran dijîya. Dêya me Hezreta Aîşe [Xuda ji wê razî be] daye zanîn, gotiye; pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di dirêjahîya 'emrê xwe de du rojan li ser hev ji nanê cihî, têr nexwariye. Di rîwayeteke din de jî gotiye; wî sê rojan li ser hev ji nanê genimî têr nexwariye û [wilo bi feqîrî] çûye axretê."[51]

Dîsa mezinê me ummeta xwe ji bo heyata teqwadarîyê teşwîq dikir û ji wan re wiha digot:

"*Bêşiwar dostên min mirovên mûtteqî ne.*"[52]

"*Tu li kuderê dibî bibe, her ji Xuda teqwadarîyê [jê bitirse] bike û li pey xirabîyeke xwe di cih de qencîyekê bike, ewê wê xîç bike, jê bibe. Bi exlaqê xweş bi mirovan re jî mûamele bike!*"[53]

Wî rêya bidestxistina teqwadarîya heqîqî jî wiha nîşan dida:

---

49. Muslim, Zikr, 73
50. Muslim, Zikr, 72
51. Buxarî, Eyman, 22; Muslim, Zuhd, 20-22; Îbnûmace, Et'îme, 48
52. Ebûdawud, Fîten, 1/4242
53. Tirmizî, Birr, 55/1987

“*Evd, heta ji tirsa ketina heramîyê terka tiştên bi şubhe* [ew tiştên ku tam ne diyar e, ka ew helal in, yan jî heram in] *jî neke, nagihîje dereceya mûtteqîyên heqîqî!*”[54]

Di nêrîna wî de ti çêtirbûna mirovê sipî ji mirovê reş nebû û ti çêtirbûna milletekî jî ji milletekî din nîn e. Çêtirbûn bes bi teqwadarîyê ye. Wî bi yeksanî li mirovan temaman dimeyzand û wiha digot:

“*Ji teqwadarîyê pê ve, bi çi tişteke din; ti çêtirbûna mirovê Ereb ji mirovê ne Ereb nîn e. Ti çêtirbûna mirovê ne Ereb jî ji mirovê Ereb nîn e. Ti çêtirbûna mirovê sor ji mirovê reş nîn e. Ti çêtirbûna mirovê reş jî ji mirovê sor nîn e..*”[55]

Di xusûsa teqwadarîyê de pênasî û terîfeke bedewa Hezretê Îsa [silavên Xuda lê bin] jî heye:

Mirovek hatibû cem Îsa [silavên Xuda lê bin], pirs jê kiribû, jê re gotibû;

“-Ya seydayê xêr û qencîyê! Tişteke tu wê dizanî û ez wê nizanibim, ew feyde bide min û zirarê nede te, ji min re vebêje!

Îsa [silavên Xuda lê bin] jê re gotibû:

“-Ew çi ye?”

Wî jê re gotibû;

“-Mirovek ji bo Xudayê xwe çawa dibe xwediyê teqwadarîyê?”

54. Tirmizî, Qîyame, 19/2451; Îbnûmace, Zuhd, 24
55. Ehmed, V, 158

Îsa [silavên Xuda lê bin] jê re gotibû:

“-Ev karekî pirr hêsan e: Ji qelbê xwe bi dilûcan ji Xuda hez bike, heta ji te were û qeweta te bigihîyê ji bo rizamendîya wî emelê salih bike, tu çawa rehmê li xwe dikî wilo rehmê li hevnijadên xwe bike.”

Wî jê re gotibû;

“-Ya seydayê xêr û qencîyê! Hevnijadên min kî ne?”

Îsa [silavên Xuda lê bin] jê re gotibû:

“-Zaroyên Adem tev in.”

Paşê jî Îsa [silavên Xuda lê bin] jê re wiha gotibû:

“-Tişta ku tu naxwazî yek wê li te bike, tu jî wê li xelkê [dîgeran] neke. Ew çax tu ji bo Xuda dibî xwediyê teqwadarîya heqîqî.”[56]

Rojekê Hezretê Ûmer [Xuda jê razî be] jî ji Ubey kurê Ke‘b pirs kiribû; teqwa çi ye?

Ubeyy [Xuda jê razî be] jî ev pirs jê kiribû:

“-Ya Ûmer! Ma tu hîç di rêyeke bi strî de meşîyayî, çûyî?”

Çi dema Hezretê Ûmer jê re got:

“-Erê, ez meşîyame, çûme.”

Vêca wî jê pirs kir û jê re got;

“-Baş e, te çi kir?”

56. Ehmed, ez-Zuhd, bê weşanxane, bê tarîx, rûpel, 59.

Hezretê Ûmer wiha bersiva wî da û jê re got;

“Min cilên xwe kom kirin û hemû dêhn û bala xwe serf kir ji bo strî zirarê nedim min.”

Vêca Ûbeyy kurê Ke‘b jê re wiha got:

“-Teqwa ev e.”

Mûtteqî, ji hêla menewî ve jî ji her kesî bêhtir ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nêzîk in.

Mûaz kurê Cebel [Xuda jê razî be] wiha dibêje:

“Dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ez ji bo Yemenê wek walî teyîn kirim, ji bo oğira min bi xêr bike, ew heta bi derveyê Medînê şeref da û hat. Ez li ser pişta hêştira [deveha] xwe siwar bûm û ew jî birêve dihat. Paşê wî hinek şîret û wesîyet li min kirin û ji min re wiha got:

“-*Ya Mûaz! Belkû piştî îsal tu hîç min nebînî! Îhtîmal heye ku tu werî vê mizgefta min, yan jî qebra min!*”

Çi dema wî ev peyv ji wî dostê xwe yê ezîz bihîstin, yanî ji ber wê cudabûna ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] min bi huzn û ğemgînî dest bi girî kir.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji min re got:

“-*Ya Mûaz, negrî!*”

Paşê wî berê xwe da rexê Medînê û wiha got:

“-*Mirovên ku ji min nêzîk in mûtteqî ne! Vêca ew kî dibin, bila bibin û ew li kuderê jî dibin bila bibin*.”[57]

**Zuhda Pêğemberê Xuda**

Zeman hatiye ku hemû dewlet bi rizamendî û arzûya xwe ketibûn bin hîmaye’ya mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Mezinê me ji vî serî heta bi wî serî li tevahîya Erebistanê bûbû serwer û desthilat. Wî çi bixwesta, dikarîbû wê bike. Digel ku ew wiha hukumran bû jî dîsa wî li ser jîyana xwe ya sade berdewam kir. Wî tim digot; ez ji bo xwe nikarim ti feyde bidim û nikarim ti zirarê jî, ji ser xwe bidim alî û rakim. Her wiha wî vedigot; her tişt di destê qudreta Xuda Teala de ye. Zeman hat ku serweteke zehf kete destê wî. Karwanên deveh û hêştiran ji xezîneyan hatibûn barkirin û serwet diguhastin û dianîn Medîna Mûnewwer. Wî, ev serwet hemû li mirovên hewcedar leva û belav dikir û wî jîyana xwe ya zahîdane eynî wekî berê berdewam kir.

Wî, digot:

“*Heke bi qasî çîyayê Uhudê zêrên min hebûna, ji bilî miqdarê ku ez ji bo deynên xwe bihêlim ew netêde ne, wekî din min ew ji sê rojan zêdetir li cem xwe nedihiştin*.”[58]

Gellek roj derbas dibûn, ji bo pehtina xwarinê li mala mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] agir nedihat pêxistin; ew gellek caran birçî radiza.[59]

57. Ehmed, V, 235; Heysemî, Mecmeuz-Zewaîd, Beyrût, 1988, IX, 22.
58. Buxarî, Temennî, 2; Muslim, Zekat, 31
59. Ehmed, VI, 217; Îbnû Se‘d, I, 405

Rojekê, Hezretê Ûmer [Xuda jê razî be] hatibû xanîyê seadetê yê Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Wî çavên xwe wiha lê gerandin. Her der virtûvala bûn. Li nav malê hesîrek hebû ji pelçimên qesb û xurmeyan hatibû hûnandin. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li ser wê pal dabû. Hesîra ziwa û hişk şûna xwe di çerm û tenê mûbarek ê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de çêkiribû. Li goşekeke malê bi qasî elbekê, ardê çehî hebû. Li cem wê jî meşkeke avê hebû, bi bizmarê ve daleqandî bû. Ha hemû serweta wî ev qeder bû!... Di wê roja ku Girava Erebistanê serê xwe ji mezinê me Fexrê Kaînatê re tewandibû û ketibû bin hukmranîya wî, hemû mal û serweta wî ji dinyayê ev bû. Çi dema Hezretê Ûmer [Xuda jê razî be] ev dît, keserek kişand nava xwe, hew xwe girt, hêstir ji çavên wî barîn û ji xwe re girî.

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê pirs kir, jê re got:

"-*Ya Ûmer, tu çima digrî?*"

Wî jî jê re got;

"-Ya Resûlellah! Ma ezê çawa negrîm? Qeyser û Kisra di nav nîmetên dinyayê de ğerq dibin! Resûlê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî li ser hesîra hişk û hola dijî, li serê radize!..."

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dilê Hezretê Ûmer xweş kir û jê re wiha got:

“-Ya Ûmer, negrî! Ma tu vê naxwazî; bila dinya bi hemû nîmet û zewqên xwe ve ji wan re be û bila axret jî ji me re be?!”

Hezretê Ûmer got;

“Belê, ez dixwazim.”

Vêca Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got: “-Ew wisa ye!” [60]

Dîsa di piştî hadîse û bûyereke wekî vê mîsalê de wiha got:

“*Dinya ji bo çiyê min lazim e! Nimûneya min û dinyayê dişibihe nimûneya siwarekî; ew di rojeke havînê de rêwîtîyê dike, li bin siha darekê xwe dide ber sihê, paşê jî radibe bi rêya xwe ve diçe û wê li wir dihêle.*”[61]

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji tirsa ku ewê di qîyametê de hesabê ajar û nîmetên dinyayê bide tim û daîm ji xwe wiha dûa dikir û digot:

“*Xudayê min! Jîyaneke bi feqîrtî bike para min; mirineke bi feqîrtî bike qismetê min û roja qîyametê jî min bi feqîran re dîsa sağ û heşr bike!*”[62]

Digel ku temînata îlahî ji hemû pêğemberan re heye ku ewê her biçin cennetê jî, lêbelê hesabê nîmetên dinyayê

60. Li Ehmed, II, 298; li Teberanî, el-Mucemûl Kebîr, tehqîq, Hemdî Ebdûlmecîd es-Selefî, Beyrût, Darû Îhyait- Tûrasi’l- Erebî, X, 162. binêrin.
61. Tirmizî, Zuhd 44/2377; Îbnûmace, Zuhd, 3; Ehmed, I, 301.
62. Tirmizî, Zuhd, 37/2352; Îbnûmace, Zuhd, 7

û hesabê ka wan peyamên Xudayê xwe ji mirovan re teblîğ kirine, yan jî nekirine, ji wan tên pirsîn.

Xuda Teala di sûretê Eraf, ayeta 6. [şeşan] de wiha ferman dike, dibêje:

"*Helbet emê hesabê ji wan mirovên ku pêğember ji wan re hatine şandin, bipirsin! Helbet emê hesabê ji pêğemberan jî bipirsin!*"[63]

❁

Tabîr û îfadeyên her wekî **zuhd**, **teqwa** û **îhsan**ê, wekî peyvên cuda cuda û hevmane ne, ku ew heman maneyê îfade dikin. Armanca hevbeşa van têgiha û mefhûmên ku kakil û rasteqîneya terbîya Tesewwifê pêktînin, firên-kirina arzûyên nefsanî û înkîşafkirina îstîdad û amadekarîyên rûhanî ye. Bi vî awayî jî ji bo "qelb bigihîje aramîyê û safî bibe." Ev jî îfadeyeke têgihaya "**Qelbê selîm**" e, ku evdîtî ya ji bo Heq Teala wê dixwaze.

### Nezaketa Pêğemberê Xuda

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xwedî qelbekî ewqas nazik, tenik û hessas bû ku rojekê, zilamek dîtibû, wî tif kiribû erdê. Sîmayê mûbarek ê wî ji nişka ve sor bûbû û ew li cihê xwe mabû. Sehabî bilezûbez ber bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ve çûbûn, ew tif xistibûn bin axê û veşartibûn. Paşê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dewam kiribû û bi rêya xwe ve çûbû.

63. Eraf, 7/6

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] digot; cilên xwe rast û tekûz bikin, di lixwekirin û qîyafetî de pêjmurdetî xweş nedidît û bela-welabûna por û rihê jî rast nedidît, teswîb nedikir. Çawa ku rojekê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li mizgeftê bû, zilamekî rih û pora wî tevlîhevbûyî derketibû pêşberî wî. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi destê xwe jê re îşaret kiribû, gotibû; riha xwe û pora xwe rast bike, biedilîne. Dema wî zilamî ev fermana wî bicih anîbû jî, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re gotibû:

"*Ma ev hal, ji wê ne çêtir e ku yek ji we por û serê wî her wekî yê şeytan bela-wela bigere?*"[64] [65]

Dîsa Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] rojekê zilamekî ser û por bela-wela dîtibû, bi heyret gotibû:

*"Ev zilam, çima serê xwe naşûyê û şeh nake?"*

Dema wî kesekî cil lewitî didît, jê re wiha digot:

*"Ma ev zat, avê peyda nake ku pê cilên xwe bişûyê?"* Bi vî awayî, îfade dikir û digot; divê misliman temîz û birêkûpêk bin.[66]

Dîsa careke din, dema zilamekî ser û qîyafetê wî bela-wela hatibû hizûra wî, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê pirs kiribû, jê re gotibû:

64. el-Mûwetta, eş-Şe'ir, 7
65. Beyheqî, Şû'ebûl Îman, Beyrût 1990, V, 225.
66. Ebûdawud, Lîbas, 14/4062; Nesaî, Zînet, 60

“*Ma malê te heye? Hal û wextê te çawa ye?*” Çi dema wî zilamî jê re gotibû; îmkanên maddî yên min baş in.

Vêca pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew wiha şîyar kiribû û jê re wiha gotibû:

“*Naxwe dema Xuda mal dabe te, bila eser û şûna wî li ser te xuya bike, were dîtin!*”[67]

Di hedîseke dîtir de jî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha gotiye:

“*Xuda hez dike esera nîmeta xwe li ser evdê xwe bibîne.*”[68]

Kesayetîya nimûneyî ya mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]; zirweya merhemet, nezaket, zerafet û tenikbûna dilê wî pêktîne.

Digel ku mirovekî dilsitûr hatibû balê û bi caran bi dengê bilind jê re gotibû;

“-Wa Mûhemmed! Wa Mûhemmed!” jî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di her carê de bi uslûbeke nerm û xweş bersiva wî dida û jê re wiha digot:

*“- Kerem bike, daxwazîya te çi ye?”*

Bi vî awayî, wî tim û daîm bi nezaket hereket kiriye û bersiva mûxateb û berpeyvên xwe daye.[69]

---

67. Ebûdawud, Lîbas, 14/4063; Nesaî, Zînet, 54; Ehmed, IV, 137
68. Tirmizî, Edeb, 54/2819; Ehmed, Ii, 311
69. Li Muslim, Nuzur, 8; Ebûdawud, Eyam, 21/3316; Tirmizî, Zuhd, 50; Ehmed, IV, 239’an binêrin!

Dîsa pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji ber nezaketa xwe ya bilind, wî bi xwe ji mêhvanên xwe re xizmet û îkram dikir.[70]

Heta di zarokatîya wî de jî mûcadele û mûnaqeşeyeke wî ya ku zirar dabe nezaketa wî, bi ti kesî re çênebûye.

Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], digel ku ew bi xwe xwediyê nezaketeke evqas bilind bû jî, wî Ehlê Beyta xwe jî li ser vî exlaqê xweş perwerde kirine.

Çawa ku ev halê nevîyê mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] ji bo wê nezaketa bilind nimûneyeke pirr ciwan û bedew e:

Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] Ke‘be tewaf kiribû, li Meqamê Îbrahîm du reket nimêj kiribûn. Paşê jî herdu destên xwe bi dergehê bilind ve rakiribûn, vekiribûn, dûa û niyazên ji dil kiribûn û wiha gotibû:

“*Ya Rebbî! Evdê te yê biçûk û zeîf hatiye ber derîyê te. Xudayê min! Xizmetkarê te yê bêçare hatiye ber derîyê te. Ya Rebbî! Gerhokê te hatiye ber derîyê te. Feqîrê te hatiye ber derîyê te!..*”

Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] di piştî vê îltîca û bergerîna dilsoj de ji wir hat, di rê de li hinek mirovên belengaz rast hat, wan hewl dida ku zikê xwe bi qetek nanê tisî têr bikin. Ew çû cem wan û silav da wan ji bo dilê wan xweş bike. Ew jî ji vê nezaketa Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] zehf

70. Beyheqî, Şûeb, VI, 518, VII, 436

memnûn bûn û ew ji bo hatina ser xwarina mûtewazîya xwe, dawet kirin.

Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] nevîyê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji nezaketa xwe bi wan hejar û belengazan re rûnişt û ji wan re got:

“-Heke min zanîba ku ev nan, ne yê sedeqê ye, minê ew bi we re xwaribana.”

Paşê dîsa ji bo dilê wan hejar û belengazan xweş bike, bi nezaket ji wan re wiha got:

“-Heydê rabin, em herin mala me!”

Piştî wî zikê wan belengazan qenc têr kir, cil û ber li wan kirin, miqdarek pere jî xistin berîka wan û oğira wan bi xêr kir, ew ji mala xwe şandin. Bi vî awayî, wî dilê wan ji xwe re fetih kir.[71]

Ev nezaket û zerafet, di eynî zemanî de mezintirîn û mûhteşemtirîn nimûne ye, nîşan dide ku Xaliqê Zulcelal jî bi terzê nêrîna şefqet û merhemetê li însanan dimeyzîne.

Ji bo halê Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] nimûneyeke din jî heye. Ew jî wiha ye:

Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] rojekê diçe nav rez û bağên Medînê, li wir koleyekî zencî dibîne. Kole, ji nanê di destê xwe de parîyekî dixwe û parîyekî din jî dide wî segê li cem xwe. Ew bi vî awayî, nanê xwe pê re bi nîvî û parve dike.

71. Li Ebşîhî, el-Mûstetref, Beyrût 1986, I, 31 binêre

Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] ji tecellîya merhemeta navê “Rehman” ya cenabê Heq Teala ku di vî koleyî de xuya bûye, heyran dimîne. Dema ew ji koleyî dipirse; te çima ev tişt kir? Kole ji ber şermî û heya’ya xwe li rûyê Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] nameyzîne.

Vêca Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] jê dipirse, jê re dibêje;

“-Xorto, tu kî yî?”

Kole jê re dibêje;

“-Ez xizmetkarê Ebanê kurê Osman im.”

Çi dema Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] jê pirs kir û jê re got:

“-Baş e, ev rez, ê kê ye?”

Kole bersiva wî wiha da û jê re got;

“-Ew, yê Ebanê kurê Hezretê Osman e.”

Ew çağ, Hesen [Xuda jê razî be] xwest ji vî kesî nêzîk bibe. Ewê ku di zahirê xwe de koleyekî normal û ji rêzê bû; lê di rastîya xwe de ew dostekî Heq Teala û siltanekî menewîyatê bû, bi vê arzûyê Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] jê re got:

“-Zinhar ji vir neçe ti devereke din! Ezê piştî kêlîkeke din werim vir, cem te.”

Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] ji wir çû û giha cem Ebanê xwediyê rez. Wî hem rez, hem jî ew kole ji xwe re jê kirrî. Paşê dîsa ew vegerîya cem wî koleyî û jê re got:

“-Xorto, min tu ji xwe re kirrî.”

Vêca kole bi hurmet rabû ser xwe û jê re got:

“-Li ser ser û çavê min! Ez li ber fermana Xuda, Resûlê wî û te hazir im.”

Çi dema Hezretê Hesen [Xuda jê razî be] ev peyv jê bihîstin, hîn bêhtir hestgerm bû. Hest û hisên wî yên heyranmayînê ji sedaqeta vî koleyî hê zêdetir bûn. Wî li hemberî sipehîbûna dilî ya vî koleyê ku ew ajotibû ser hest û fikarên ev qeder kûr, jê re wiha got:

“-Tu, êdî ji bo Xuda azad î! Ez vî rezî jî bi xêra xwe didim te!”[72]

**Heya û Edeba Pêğemberê Xuda**

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi dengê bilind xeber nedida. Ew, di ber mirovan de hêdîka û bi devkenî [tebessum] derbas dibû. Dema wî xebereke bê nezaket ji mirovan dibihîst û ew li xweşîya wî nediçû, wî ew li rûyê mirovan nedida û tiştek nedigot. Ji ber ku wî halê xwe bi îfadeyên çehre û rûyê xwe dida xuyakirin, mirovên li hawîrdora wî di axaftin û hereketên xwe de bi îhtiyat bûn, li xwe miqate bûn. Wî ji ber hestên heya’ya bilinda xwe bi qehqehe û dengê bilind nekenîye. Ew bi tebessum tenê dikenî. Bi îfadeya sehabîyan, heya’ya wî ji heya û şermokîya wê keça ciwana ku xwe bi serpoşa xwe û hîcaba xwe dinixumîne, hê zehftir bûye.

72. Îbnû Menzûr, Mûxteserû Tarîxî Dimeşq, VII, 25

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîsên şerîf ên xwe de wiha gotiye:

"***Heya** ji îmanê ye û mirovê biheya jî di cennetê de ye! Bêheyatî jî ji hişkbûna dil e; mirovê dil-hişk jî di cehennemê de ye!..*"[73]

"*Heya û îman pev re ne; dema yek ji wan rabe, biçe, ya din jî pê re radibe, diçe!*"[74]

"*Peyva hişk, ji bilî eybîyê tiştekê din nayêne! Heya û edeb jî bikeve kuderê wê dixemilîne!*"[75]

Heya'ya heqîqî bi "**bîranîna mirinê**" çêdibe, ewa ku hezkirina dinyayê ji dil derdixe. Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tim û daîm ji sehabîyên xwe re digot; heyakirina ji Xuda Teala çawa layiq be, wilo jê heya bikin. Carekê sehabîyên wî jê re gotin; hemd ji Xuda re be, em li hemberî Rebbê xwe xwediyê heyayê ne. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wan re vegot; heya'ya heqîqî ev e ku mirov hemû aza û endamên bedena xwe ji heramîyê biparêze û mirinê jî hîç ji bîra nake. Piştre wî eşkere got; mirovê ku axretê arzû bike, divê ew hezkirina dinyayê terk bike. Bes ewên ku wiha dikin, dibe ku ew bi awayekî layiq ji Xuda Teala heya û şerm dikin.[76]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi diqqet li rûyê ti kesî nedimeyzand. Nêrîna wî li erdê, ji nêrîna wî ya

73. Buxarî, Îman, 16
74. Teberanî, Ewset, VIII, 174; Beyheqî, Şûeb, VI, 140
75. Muslim, Birr, 78; Ebûdawud, Cîhad, 1
76. Tirmizî, Qîyame, 24/2458

li asîmanî zehftir bû. Wî, ji ber heya û kesayetîya bilinda xwe xeta û şaşîya ti kesî li rûyê wan nedida.

Bi vegotina dêya me Hezreta Aîşe, dema xebereke ku li xweşîya wî nediçû ji kesekî digiha wî, wî wiha nedigot:

"*Çi li filan kes qewimîye ku halo û wilo dibêje.* Lê wî digot; *çi li hinek mirovan qewimîye ku halo û wilo dibêjin*."[77]

Hinek caran jî ji bo mezinê me bi mûxatebên xwe bide hiskirin ku ew wê xeta û şaşîyê layiqê wan nabîne, bi uslûbeke zerîf ji bo îqazkirina wan wiha digot:

"*Çi ji min bûye ku ez we wiha dibînim*?"[78]

Ew pêğemberê xwedî meqamê bilind, abîdeyeke ulwî û bilinda merhemetê bû; dema wî şîret û nesîhet li mirovan dikirin jî adeta ew dilerizî ji bo mûxatebên wî ğemgîn nebin, yan jî dilê wan jê nemîne.

Dostê Heq Teala Hezretê Mewlana, yê ku ev exlaqê nebewî [pêğemberî] ji xwe re kiribû exlaq, wî her wekî ku îfadeyên mûşexxes li heqîqetên mûcerred bike, wiha dibêje:

"Eqlê min ji qelbê min pirs kir, jê re got; 'îman çi ye?' Qelbê min xwe tewand ber guhê eqlê min û jê re got; 'îman edeb e."

77. Ebûdawud, Edeb, 5/4788
78. Buxarî, Menaqib, 25, Eyman 3; Muslim, Selat, 119; Îbnû Hibban, IV, 534.

**Şecaet û Mêrxasîya pêğemberê Xuda**

Tesewwirkirina qehremanekî ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] mezintir û lehengtir ne mûmkin e. Lewra ew, di temamê jîyan û heyata xwe de di nav tirs û fikaran de nehatiye dîtin. Wî, li hemberî rewş û halên awerte sebr dikir û xwe bi semağ û sebat radigirt. Wî bi tirs û fikar hereket nedikir.

Ew, di nav koma mirovên ku ji bo kuştina wî çavnêrî dikirin de, ev herdu ayetên sûretê Yasînê xwendibûn û bê saw û tirs di nav wan re derbas bûbû, çûbû:

"**Lewra me, qeyd xistine stûyên wan, ew qeyd gihîştine heta erzenîya wan. Ji bo vê, serê wan bi banî ve rakirî ye. Me, li pêşiya wan astengek û li paşiya wan jî astengek daniye û ber wan girtiye. Êdî ew heqiyê nabînin**."[79]

Hezretê Elî [Xuda jê razî be] dibêje:

"*Dema li Bedrê şerr bi her dijwarîya xwe dewam dikir, carina me xwe dixist pişt mezinê xwe pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û me xwe bi wî diparast. Ew, ji me tevan cesûrtir bû. Ew li cihê nêzîktirê sefa dijmin bû.*"[80]

Careke din Bera [Xuda jê razî be] di bara dilêrî û mêrxasîya mezinê me Hebîbê Ekrem [dirûd û silavên Xuda lê bin] de wiha gotiye:

"*Qesem bi Xuda ye, dema şerr germ dibû, me xwe bi mezinê xwe pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê*

79. Yasîn, 36/8-9
80. Ehmed, I, 86

*bin] diparast. Cesûrtirînê me ew kes bû ku karîbû li dehma pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] raweste.*"[81]

Wî tim û daîm di sefa pêşî de ji bo bilindkirina kelîmetullah, yanî ji bo dînê Xuda bibe yê ji hemû dînan bilindtir û zaltir, şerr dikir. Di **Ğezw**a **Huneyn**ê de di serê pêşî de ordîya îslamê şikestibû. Lêbelê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] neşikestibû, wî xwe ragirî û metaneta xwe hîç xirab nekiribû. Wî xwe avêt nav koma neyaran û wî hespê xwe her bi pêş ve diajot. Bi vî awayî, wî mêranîya sehabîyên xwe zêde kiribû û di dawîyê de jî bi piştevanî û arîkarîya Xuda Teala serkeftin û zefer bûbû nesîbê wî.[82]

Wî wiha digot:

"*Ez, bi wî Xudayî sûnd dixwim ku bi qudret û îradeya wî dijîm, min dixwest ku di rêya Xuda de herim ğezwê û şehîd bibim, paşê [bêm sağkirin] herim ğezwê û dîsa şehîd bibim, dîsa careke dîtir herim ğezwê û şehîd bibim...*"[83]

## Hilm û Xuy-Nermîya pêğemberê Xuda

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] mulayîmtirîn mirovê nesla însên bûye.[84]

Dêya me Aîşe, di bara wî de wiha dibêje:

81. Muslim, Cîhad, 79
82. Muslim, Cîhad, 76-81
83. Muslim, Îmare, 103
84. Muslim, Hec, 137

“Hîç ti kesek nebû ku exlaqê wî ji exlaqê Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xweştir be. Çi ji sehabîyên wî, çi jî ji ehlê mala wî kî gazî wî dikir, her wî digot; “*kerem bike!*” Ji ber wî exlaqê bilind ê wî Xuda Teala di bara wî de ev ayeta pîroz nazil kiriye û jê re gotiye: **“Bêşiwar tu, xwedî exlaqekî mezin î!”**[85]

Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], di jîyana xwe de ti caran ji bo xwe întîqam nestandiye, lêbelê wî tim û daîm efû û berbuhêrî esas digirt.

Dîsa dêya me Hezreta Aîşe di ‘exlaqê bilindê wî de halê mûlayîmtîya wî’, wiha îfade dike, dibêje:

“Wî, eyb û qusûr ji ti kesî re çênedikir. Dema yekî di bara wî de neqencîyek dikir, wî jî di bara wî kesî de neqencîyeke wekî ya wî pê nedikir. Wî, bi ef û xweşbînîyê mûamele dikir. Wî, xwe ji xirabîyê dûr dikir. Wî, ji bo nefsa xwe ji ti kesî întîqam hilnedaye. Wî, bi destê xwe hîç li kole, xizmetkar û jinekê nedaye. Heta wî bi neheqî li heywanekî jî nedaye...” [86]

Dema Hezretê Enes [Xuda jê razî be] mezinê me, Fexrê Kaînatê vedigot, di bara wî de wiha gotiye:

“Min hîç destê xwe nedaye armûş û hevrîşmekî ji destên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nermtir. Min hîç bêhneke ji bêhna pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xweştir jî bêhn nekiriye. Min tam deh salan xizmet ji mezinê me re kir. Wî careke tenê jî ji min re “of!” negot. Wî, ji ber tiştekî ku min kiribe, ji min re hîç negotiye; “te, çima ev

85. Qelem, 68/4” Wahidî, rûp, 463
86. Li Muslim, Fedaîl, 79’an binêrin!

kir"? Wî ji ber tiştekî ku min nekiribe jî, ji min re hîç negotiye; "te çima ev nekir"?[87]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi vê gotina xwe pesnê sihabîyekî dabû, gotibû:

"*Du xeslet di te de hene Xuda ji wan hez dike: **Helîmbûn*** [xuy-nermîtî] *û **teennî*** [îhtîyatkarî] *ye*."[88]

Yekî bedewî li mizgefta Nebewî mîz kiribû. Sehabîyan destpê kiribû, erza wî şikandibûn. Vêca pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wan re gotibû:

*"Wî li ser halê wî bihêlin. Dêwleke tam ne tije-av, yan jî dêwleke tam tije-av li ser cihê mîza wî bikin. Hûn ji bo hêsankarîyê nîşan bidin hatine şandin; lê hûn ne ji bo zorkirinê hatine şandin.."*[89]

Paşê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi zimanekî şîrîn û xebereke xweş ehemmîyet û edeba mizgeftan jê re îzah kir.

Enes [Xuda jê razî be] wiha dibêje:

Ez, bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re dimeşîyam. Kurkekî Necranî û kevî sitûr û gij li ser wî hebû. Yekî bedewî giha pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û bi awayekî tund ew kurkê wî bi alîyê xwe ve kişand. Min li stûyê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]

87. Buxarî, Sewm, 53; Muslim, Fezaîl 82
88. Muslim, Îman, 25, 26
89. Buxarî, Widû, 58, Edeb, 80

meyzand, min dît ku kenarê kurk şûna xwe ser ve biribû û cihê xwe têde çêkiribû. Paşê wî bedewî jê re wiha got;

“-Ya Mûhemmed! Ferman bike, bila hinekî ji wî malê Xuda yê ku li cem te heye bidin min jî!”

Mezinê me Fexrê Kaînatê, li wî bedewî fetilî û bi tebessum kenî. Paşê jî ferman kir, got; “*hinek tiştan bidin wî.* ”[90]

Çawa ku serkeftin û tewfîqa wî di wezîfa teblîğa rîsalet û peyamên îlahî de jî bi bereketa van halên bilind ên wî bûye. Cenabê Heq Teala kemala mezinê me Pêğember [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha dide zanîn, dibêje:

“**Tu bi rehma Xuda, li biwara wan nerm bûyî! Heke tu, yekî xebertehl û dilhişk bûyayî, bêşiwar ewê ji hawîrdora te belav bibûna û biçûna**.”[91]

Bi rastî însanên cahilîyeta wê rojê, li hemberî kesayetîya wî; rû-nermîya wî, tebîet xweşîya wî, efûkarîya wî, exlaq xweşîya wî, helîmbûna wî û mûsamehakarîya wî wekî mûm û şimayê helîyabûn, ji wehşet û tebîet-nexweşîya xwe xilas bûbûn û li dora wê nûra însanîyetê bûbûn wekî perperîk û perwane.. Lewra wî, ne xusrana însanîyetê; lêbelê hîdayeta wê dixwest. Wî ne ezab; lê rehm temsîl dikir.

90. Buxarî, Xumûs, 19, Lîbas 18, Edeb 68; Muslim, Zekat 128
91. Alî Îmran, 3/159

## Şefqet û Merhemeta Pêğemberê Xuda

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîseke xwe de wiha ferman kiriye, gotiye:

"*Rehman, li mirovên ku merhemetê dikin, rehmê dike. Şefqet û rehmê li mexlûqatên li sererdê bikin, vêca ewên li asîmanî jî dê rehmê li we bikin.*"[92]

Dema wî dengê girîyê zarokî dibihîst ji tirsa ku dibe dêya wî bikeve rewşeke zor û zehmet û ji bo ew demekê berî demekê zûtir here lê binêre, wî nimêja xwe kurt û bilez dikir. Wî şevên dirêj nimêjên teheccudan dikirin, hêstir ji çavên wî dibarîn û wî ji bo ummeta xwe dûa ji Xudayê xwe dikirin. Wî hemû wext û demên xwe feda dikirin ji bo mirovan ji êgir xilas bike. Ev hemû elamet û berate bûn, kûrbûna şefqet û ferehbûn û hessasbûna merhemeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nîşan didin.

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji ber ku wek rehm ji aleman re hatibû şandin, hezkirin û merhemeta wî her zindî û candar xistibû nav xwe û ew îhate kiribûn. Rojekê nifir ji wî xwestibûn lêbelê wî wiha gotibû:

"*Ez ji bo nifirkirinê ji dinyayê re nehatime şandin; lêbelê ez wek Pêğemberê Rehmê, hatime şandin.*"[93]

Dema ew ji bo teblîğkirina mislimanetîyê çûbû Taîfê, xelkê cahil, pûtperest û xwedbîn ê Taîfê ew kevirbaran kiribûn; bi keviran lê dabûn.

92. Tirmizî, Birr, 16/1924
93. Muslim, Fedaîl, 126; Tirmizî, De'ewat, 118

Melaîketê Çîyan bi Hezretê Cebraîl re hatibû cem mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Çi dema jê re gotibû;

“-Ma tu dixwazî ez van herdu çîyan li hev bixim û vî qewmî wilo pê bibim helakê?”

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pê razî nebû û jê re wiha gotibû:

“-*Na, ez ji cenabê Heq Teala dixwazim ew ji pişta wan hinek mirovan derxîne, bîne ku ew îbadetê ji wî tenê re bikin û tiştekî jê re nekin şirîk.*”[94]

Vî xelkê Taîfê, bi keviran lê dabûn. Ew ji welatê xwe derxistibûn û heqaretên curecur lê kiribûn. Heta sala nehê Hicretê jî bi berxwedaneke dijwar gellek ziyanên zêde bi mislimanan gihandibûn. Digel van hemû neqencîyên wan jî wî di bara wan de her berdewam ev dûa û nîyaz ji Xudayê xwe dikir û digot: “*Ya Rebbî! Hîdayetê bixe nesîbê êla Seqîf! Wan bişîne cem me!*” Di dawîyê de xelkê Taîfê ji bo misliman bibin hatin Medîna Mûnewwer.[95]

Ebû-ûseyd [Xuda jê razî be] hinek yexsîr ji Behreynê girtibûn, bi xwe re anîbûn û hatibû hizûra pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jineke yexsîr dît ku wa ye, ew digrî. Jê pirs kir, jê re got:

“-*Tu çima digrî?*”

94. Buxarî, Bed’ûl-Xelq, 7; Muslim, Cîhad, 111
95. Îbnû Hîşam, IV, 134; Tirmizî, Menaqib, 73/3942

Wê jinê jê re got;

“-Vî zilamî kurê min firot.”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji Ebû-ûseyd pirs kir, jê re got:

“-*Ma te kurê wê firot?*”

Çi dema wî bersiva wî da û jê re got;

“-Erê.”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

“*Te ew firote kê?*”

Sehabî jê re got;

“-Min ew firote Kurên Ebs.”

Vêca pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wî sehabîyî re got:

“-*Li heywanê xwe siwar bibe, derhal here, kurê vê jinê bigre û wî bi xwe re bîne û were*.”[96]

Şefqet û merhemeta mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], xwedî wesfeke cîhanşimûl bû. Çawa ku wî rojekê gotibû:

“-*Ez bi wî Xudayî sûnd dixwim ku nefsa min di destê qudreta wî de ye, heta hûn rehmê li hev nekin hûnê neçin cennetê*.”

Eshabê Kîram jê re gotin;

96. Elî el-Mûtteqî, el-Hindî, Kenzû’l-Ûmmal, Beyrût 1985, IV, 176/10044.

“- Ya Resûlellah! Em tev bi merhemet in.”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wan re got:

*“Merhemeta [ku ez qesd dikim], ne ew merhemet e, ku hûn wê fehm dikin û hûn rehmê li hev dikin. Berevajîyê vê; ew merhemet e ku hemû mexlûqatan dide ber xwe, [erê] ew merhemeta ku hemû mexlûqat dikevine berê ye!..”*[97]

**Efûkarîya pêğemberê Xuda**

Cenabê Heq Teala ji efûkirinê hez dike. Cenabê Xuda Teala soz daye ku heke evd, ji xeta û şaşîyên xwe bi dil û can poşman bibe, di dilê xwe de hest bi êş û îzdîrabê bike û tobe bike, ewê tobeya wî qebûl bike. Xuda Teala yê me, çawa ew bi xwe efûkar e, eynî wilo ew dixwaze ku evdên wî jî ji hev re efûkar bin.

Şertê efûkirinê; divê mirov poşman bibe, divê mirov ji emr û fermanên Xuda re îtaet bike û divê mirov xwe ji heramîyê dûr bike, jê bireve. Sipehîtirîn mîsal û nimûneyên efûkirinê jî di heyata mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de mewcûd in. Ew Hinda ku di Herba Uhudê de ji hirs û kîna nava xwe kezeba apê wî Hezretê Hemza dabû ber diranên xwe û gez kiribû, Wî ji bo hurmeta şanê kelîma Tewhîdê roja fetha Mekkê ew efû kiribû.

Hebbar kurê Eswed yek ji dijminê dînê Îslamê bû. Dema keça mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên

97. Hakim, IV, 185/7310

Xuda lê bin] Hezreta Zeyneb li hêştirê siwar bûbû û ji Mekkê hicret kiribû, ber bi Medînê ve diçû, wî bi rima xwe li hêştira wê dabû û kiribû ku ew ji ser hêştira xwe ketibû erdê. Hezreta Zeyneb ji ber ku bihemle bû, zaroka wê ji ber çûbû. Ew bi awayekî giran birîndar bûbû û di nav xwînê de mabû. Paşê jî ev birîndarîya wê bûbû sersebebê wefata wê. Hebbar gellek sûcên dîtir jî yên wekî vî sûcî kiribûn. Ew piştî fetha Mekkê revîbû û nehatibû girtin. Hebbar di demeke ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li Medînê bi sehabîyên xwe re rûniştîbû de hatibû seadeta hizûra wî, bi ser wî de şipya sekinîbû û jê re gotibû; "silav li te be, ya pêğemberê Xuda! Ez şehde didim; bi devê xwe dibêjim û bi dilê xwe jî yeqîn bawer dikim ku ji Xuda pê ve ti îlahê bi heqîyê nîn in û tu jî pêğemberê Xuda yî. Ez ji ber te revîbûm çûbûn li welatan gerîyabûm û min xwestibû bigihîjim eceman. Paşê min kerema te, qencîya te û efûkarîya te ji mirovê ku qedrê te nizane re anî bîra xwe. Ya pêğemberê Xuda! Em ehlê şirkê bûn, Xuda em bi te anîne ser hîdayetê û em bi te ji helakê xilas kirine. Vêca nezanîna min û neqencîyên min, yên ku digihan te, efû bike. Ez bed-karîyên xwe qebûl dikim û gunehên xwe îtîraf dikim. Ez hatime, misliman bibim."

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

"-*Min tu efû kirî. Xuda qencî li te kiriye. Tu ji bo Îslamê anîyî ser hîdayetê. Îslam jî gunehên berîya xwe dide efûkirin*."

Bi vî awayî, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew jî efû kir. Heta heqaretkirina li wî û sûcê wî dana rûyê wî jî qedeğe kiribû.[98]

Îkreme kurê Ebûcehl jî yek ji dijminên dijwar û bihijmar ê Îslamê bû. Ew piştî fetha Mekkê revîbû, çûbû Yemenê. Jina wî Ummû Hekîm keça Harisê kurê Hîşam jineke eqilmend bû, ew misliman bûbû, paşê wê ji bo mêrê xwe temînat ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xwest, wî jî jê re got; here, wî vegerîne, bîne. Ew jî ji malê derket û çû pey wî, wê jê re got:

"-Ez, ji cem mirovê ku ji hemû mirovan bêhtir têkilîya xizmtîyê digihîne, ji hemû mirovan qenctir e û ji hemû mirovan çêtir e, hatime cem te. Min ji bo te temînat jê xwest, wî temînat daye te."

Ew jî bi jina xwe re vegerîya hat. Çi dema ew ji Mekkê nêzîk bû, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji sehabîyên xwe re got:

"*Îkreme kurê Ebûcehl wek mûmîn û mûhacir tê cem we. Vêca hûn ji bavê wî re sixêfan nekin. Lewra sixêfên ji mirî re ezîyetê didin yê sağ û ew nagihin yê mirî jî!.*"

Bi vî awayî jina wî ew wek misliman anîbû cem mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî bi memnûnîyet pêşwazî li Îkreme kiribû.

98. Waqidî, II, 857-858

Çi dema ew giha ber derîyê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], ew bi hatina wî keyfxweş bû, rabû şipya û pêşwazî lê kir.[99] Û jê re got:

"*Ey Siwarê koçber, tu bi xêr hatî!*" û ji mislimanan re got; "*zulma ku wî kirî nedin rûyê wî!*" û ew jî efû kir.[100]

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] gellek caran wiha dûa dikir, digot:

"*Xudayê min! Ummeta min efû bike! Lewra ew nizanin.*"[101]

Çi dema lîderê Yemamê Sumame kurê Usal misliman bû, wî têkilîyên bazirganî yên xwe bi mûşrikên Mekkê re qut kiribûn. Hal-hal e Qureyşîyan her cure erzaq û îhtiyacên xwe ji Yemamê dikirrîn û temîn dikirin. Bi vê qutkirina têkilîyên xwe ji wan jî Mekkeyî bi ber birçîbûn û ğelayê ketin. Vêca wan bi awayekî şaşo maşo xwe avêtin mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo wan ji vê rewşa kambax azad bike. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî mektûb û nameyek ji Sumame re nivîsand û şand û têde jê re got; "*li ser kirina ticareta xwe bi wan re berdewam bike*"![102]

Hal-hal e, wan mûşrikan sê salên temam misliman di taxa Ebûtalib de ji xwarin û vexwarinê mehrûm kiribûn û kiribûn ku ew di nav ezabê de ferfitîbûn. Lêbelê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dîsa jî ew efû kiribûn.

99. Hakim, el-Mûstedrek, 3/269
100. Tirmizî, Îstî'zan, 34/2735
101. Îbnûmace, Menasik, 56; Ehmed, IV, 14
102. Îbnû Ebdilberr, el-Îstîab, Qahîre, bê tarîx, I, 214-215; Îbnû Esîr, Usdû'l-Ğabe, Qahîre 1970, I, 295.

Ji vê û wêdetir jî, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di sala heftê hicrî de piştî fetha Xeyberê, xeber gihayê ku li xelkê Mekkê hişkesalî, birçîbûn û ğela rabûye. Wî, ji wan re zêr, ceh, sîsikên qesb û xurmeyan ji wan re şandin û bi vî awayî arîkarîya wan kir. Ebûsufyan jî ev arîkarî tev teslîm girtin, li hejar û xizanên Qureyşîyan belav û leva kirin û bi van gotinan jî memnûnîyeta xwe îfade kir, got;

"-Xuda mûkafata kurê birayê min jê re xêr binivîse! Lewra wî, heqê xizmtîyê li ber çavan girt!"[103]

Dilê xelkê Mekkê li pêşberî van fezîletên mezin nerm bû û piştî mideteke ew hemû misliman bûn.

Li Hudeybîyê, nijdeyeke mûşrikan ji bo bi ser mislimanan de bigre hatibû û xwestibû ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bikuje. Lêbelê hemû endamên wê nijdeyê hatibûn girtin. Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ev hemû jî efû kirin.[104]

Di piştî fetha Xeyberê de jinekê jehr xistibû nav xwarina pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] goşt bir ber devê xwe, xebera wî jê çêbû ku jehr di navê de heye. Digel ku wê jina cihû îtîraf kir ku wê jehr xistiye nav xwarinê jî, dîsa Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew jin efû kir.[105]

103. Yaqûbî, II, 56
104. Muslim, Cîhad, 132, 133
105. Buxarî, Tibb, 55; Muslim, Selam, 43

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi rêya wehîyê, ew Lebîdê cihûyê mûnafiq, ewê ku sêhr lê kiribû û bûbû sebeb ku ew nexweş bikeve û êş û îzdîrabê bikişîne jî û ewê ku ew ji bo vî karê xirab teşwîq kiribû jî, hîn bûbû ka ew kî ye.. Lêbelê wî ti caran ev curm û sûcê Lebîd neanî zimên û ew ji bo vî sûcî jî nekuşt. Wî, ew Lebîdê ku qesda kuştina wî kiribû nedabû kuştin û wî ti kes ji wan cihûyên Benû Zureyq ên ku Lebîd ji êla wan bû jî nedabû kuştinê.[106]

Lewra Xuda Teala di Qur'ana Pîroz de jê re digot:

"*[Ey Resûlê min!] Tu ji xwe re rêya efûyê bigre; efû bike; şîreta ya mûnasib bike û berê xwe ji cahilan vegerîne!*"[107]

Ew evdên arif jî, ewên ku karîne bi mûhebbet û hezkirin ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nêzîk bibin û karîne bi awayekî layiq ji efûkarîya wî para xwe wergirin, ha wan jî tim û daîm bi umîda ku ew bigihîjin efûya îlahî, rêya efûkirinê ji xwe re girtine.. Çawa ku dema kevir li **Hellacê Mensûr** dihatin barandin, wî wiha nîyaz dikir û digot:

"-Ya Rebbî! Evên ku keviran diavêjin min, wan berîya min, efû bike!"

---

106. Li Îbnû Se'd, II, 197; li Buxarî, Tibb, 47, 49; li Muslim, Selam, 43; li Nesaî Tehrîm, 20; li Ehmed, IV, 367, VI, 57; li 'Eynî, XXI, 282'yan binêrin!
107. Eraf, 7/199

**Rîayetkirina pêğemberê Xuda Ji Bo Heqê Cîranan**

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tim û daîm arzû dikir ku heqê cîranan rîayet bike. Ji lewma ew di hedîsên xwe de wiha ferman dike, dibêje:

"*Cebraîl wesîyeta qencîkirina li cîranî ewqas her li min kir, heta min zen kir ku ewê cîranî ji bo cîranê wî bixe waris*."[108]

Ew di hedîseke din de jî wiha dibêje:

"*Sê cure cîran hene. Cîran heye ku sê heqên wî li ser mirov hene. Cîran heye ku du heqên wî li ser mirov hene. Cîran jî heye ku wî heqekî tenê li ser mirov heye. Ewê ku sê heqên wî li ser mirov hene, ew cîranê mislimanê lêzim e. Heqê wî yê cîrantîyê, heqê wî yê mislimanetîyê û heqê wî yê lêzimtîyê li ser mirov hene. Ewê ku du heqên wî li ser mirov hene, ew cîranê misliman e. Heqê wî yê cîranetîyê û heqê wî yê mislimanetîyê li ser mirov hene. Ewê ku heqekî wî yê bi tenê li ser mirov heye, ew jî cîranê kafir e. Heqê wî yê cîranetiyê tenê li ser mirov heye.*" [109]

Îxlalkirin û binpêkirina heqê cîranî; bi meyzandina li pencereya wî, bi ezîyetdana wî ya bi bêhna xwarinê û bi kirina hereketeke ku li xweşîya wî naçe, çêdibe.

Ji lewma Fexrê Kaînatê [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha dibêje:

108. Buxarî, Edeb, 28; Muslim, Birr, 140-141
109. Beyheqî, eş-Şûeb, 7/83; Suyûtî, el-Camîûs- Seğîr, Misr 1321, I, 146.

“*Çêtirîn heval li cem Xuda, ew e ku ji hevalê xwe re çêtir be. Çêtirîn cîran jî li cem Xuda, ew e ku ji cîranê xwe re çêtir be.*”[110]

Dîsa pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dibêje:

“*Ewê ku zik-têr raze û cîranê wî jî li tenişta wî birçî be, ne mûmîn e!*”[111]

Hezretê Ebûzerrê Ğifarî gotiye:

“Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji min re got; “*Ya Ebûzerr! Dema tu şorbê bipêjî, ava wê zêde bike û wê bide cîranê xwe jî.*”[112]

Ebûzerr yek ji sehabîyên feqîr bû. Naxwe ji bo bicihneanîna heqê cîranî ti uzrekî meqbûl nîn e, heta ji bo mirovê feqîr bi xwe jî.

Ebûhûreyre [Xuda jê razî be] rîwayet dike, dibêje; rojekê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] got:

“*Qesem bi Xuda ye, wî îman neanîye! Qesem bi Xuda ye, wî îman neanîye! Qesem bi Xuda ye, wî îman neanîye!*”

Eshabê Kîram jê pirsîn, jê re gotin;

“-Ya Resûlellah! Kî îman neanîye?”

Mezin û serwerê aleman bersiva wan da û got:

110. Tirmizî, Birr, 28
111. Hakim, II, 15/2166
112. Îbnûmace, Et‘îme, 58

“-*Ewê ku cîranê wî ji zulm û neqencîyên wî ne ewle bin*!”[113]

Li gorî rîwayeteke din jî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha gotiye:

“*Ewê ku cîranê wî ji zulma wî ne ewle be, naçe cennetê*!”[114]

## Mûamelekirina pêğemberê Xuda Bi Feqîran Re

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi şefqetkirina li feqîr, sêwî û jinebîyan û bi nêzîkbûna wî ji wan dihate naskirin.[115] Wî, bi wan re zehf bi şefqet û mûşfîqane mûamele û hereket dikir ji bo kêmasîya asta refaha maddî ya wan telafî bike.

Ebûseîdê Xudrî [Xuda jê razî be] vedibêje:

“Ez, bi komeke feqîrên mûhaciran re rûniştibûm. Hinekan ji wan ji tazîbûnê xwe bi hinekên din ji wan dinixumand. Yekî jî Qur’an ji me re dixwend. Ji nişka ve pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hat û li cem me sekinî. Çi dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hate cem me, wî yê ku ji me re Qur’an dixwend, dev ji xwendina wê berda. Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî silav da, ji me pirs kir û got:

“-*Hûn çi dikin*?”

Me jî jê re got:

113. Buxarî, Edeb, 29; Muslim, Îman, 73; Tirmizî, Qîyamet, 60
114. Muslim, Îman, 73
115. Buxarî, Nefeqat, 1; Muslim, Zuhd, 41-42

“-Ya Resûlellah! Ew seydayê me ye, ji me re Qur’anê dixwîne. Em jî li kitêba Xuda guhdarî dikin.”

Vêca Fexrê Kaînatê [dirûd û silavên Xuda lê bin] got:

“*Hemd, her ji Xuda re be, ewê ku hinekên wisan ji ummeta min aferandine û ferman li min kiriye ku ez bi wan re sebr bikim!*” [116]

Paşê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], bi tewazû û nefsbiçûkîtîyeke mezin di nîvê me de rûnişt. Bi destê xwe jî îşaret kir, got;

“- *wiha [heleqê] çêkin!*”

Cemaet jî derhal li dora wî bû heleqe û berê xwe dane wî. Paşê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ev mizgînîya ha da me:

“*Gelî feqîrên mûhaciran, mizgînî ji we re be! Ez roja qîyametê mizgînîya nûreke tam didim we. Hûnê bi nîv-rojî berî zengînan biçin cennetê. Ev nîv-roj [bi rojên dinyayê] tam pênsed sal dike.*”[117]

116. Mezinê me Pêğember bi vê gotina xwe, vê ayeta ha destnîşan dike: “**Sebra xwe digel yên ku sibeh û êvarê li ber Xudeyê xwe digerin û rizaya wî dixwazin, bîne û ji bo tu xemla jiyana dinyayê bixwazî çavên xwe ji wan neguherîne. Bi xebera wî neke; ewê ku me dilê wî ji bîranîna xwe ğafil kiriye û ewê ku daye pey hewesa xwe û karê wî sînorbuhêrî ye.**” li vir Xuda Teala li mezinê me Resûlê Ekrem ferman dike, jê re dibêje; bi wan feqîr û ketîyên ku pêşîyê hatine misliman bûne re li hemberî tengasîyên ku bêne serê wan sebr bike û di mûamelekirina digel wan de jî zehf hessas hereket bike.

117. Ebûdawud, Îlm, 13/3666

Rojekê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], li Medînê rûniştîbû, êleke ser-sefîl hat; pêxwas û tazî bûn, ji birçîbûnî û germê çermê wan bi hestîyên wan ve zeliqîbûn. Çi dema Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ev belengazîya wan dît, ew zehf di bin bandora wê de ma, rengê wî bi xwe re guherî. Ew çû hundur, paşê derket, bi Bîlal [Xuda jê razî be] ezan da xwendin, eshabê kîram kom kirin, pê qamet jî da kirin. Paşê wî li pêşîya wan nimêj kir, paşê rabû axaftinek kir û ew ji bo arîkarîya van rebenan teşwîq kirin. Çi dema dît ku wa ye, sehabîyan zehf xêr û hesenat li van jaran kirin, paşê ew hinekê rehet bû û rûyê wî xweş û geş bû.[118]

Heyat û jîyana mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi tezahur û xuyahîyên çendîn xarîqe, îbret-engîz, rastî, durustî, sedaqet, şefqet, merhemet û nezaketê tije ye.

Wî tim şîret li hevsera xwe Hezreta Aîşe dikir û jê re wiha digot:

"*Ya Aîşe! Çendan bi nîv-xurmekekê be jî feqîran vala bi şûn de nevegerîne. Ya Aîşe! Ji feqîran hez bike û wan ji xwe nêzîk bike, da ku roja qîyametê Xuda jî te ji xwe nêzîk bike*."[119]

Ebbad kurê Şûrahbîl [Xuda jê razî be] vedibêje:

Ez demekê feqîr bûbûm. Ji lewma ez çûm nav bexçekekî ji bexçeyên Medînê. Min sinbilek firikand, min hem jê xwar, hem jî ew xiste kîsê xwe. Nagihan xwediyê bexçeyî hat,

118. Muslim, Zekat, 69-70; Ehmed, IV, 358, 361
119. Tirmizî, Zuhd, 37/2352

ez girtim, li min da, kîsê min ji min stand, ez birim cem pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û gilehê min jê re kir.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji xwediyê bexçe re got:

“*Dema ew cahil bû, te ew neelimandiye û dema ew birçî bû jî, te ew têr nekiriye!*”

Paşê wî ji xwediyê bexçe re got; kîsê wî bidîyê.

Paştir pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wesqek yan jî nîv wesq ji xwarinê da min.[120]

Di Îslamê de pêşî lêgerîn li serkehnîya sûc tê kirin û ji bo îslaha sûckerî jî kar tê kirin. Ji vî rexî ve cezayên di hiqûqê îslamê de, her wekî cezakirina dê-bavan ya ji bo zarokên wan e. Ğaye, ne qewirandin û terdkirina wî ji heyata sosyal û civakî ye; lêbelê ji nû ve qezenckirina wî ji bo civakê ye.

## Mûamelekirina Pêğemberê Xuda Bi Êsîr û Xizmetkaran Re

Şefqeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ewqas zehf bû heta ku bi êsîrên herbê jî digiha û wî ferman dikir, digot; bi wan re jî xweş mûamele bikin.

Birayê Mûs‘eb kurê Ûmeyr Ebû-ezîz, ev bûyera bi îbret vegotiye:

120. Ebûdawud, Cîhad, 85/2620-2621; Nesaî Qûdat, 21

“Ez jî di Herba Bedrê de êsîr ketibûm û ez ji bo komeke Ensarîyan hatibûm radestkirin. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wan re gotibû:

“-*Bi êsîran re xweş mûamele bikin!*”

Ew cemaeta Ensarîyan ya ku ez li dev wan bûm, ji bo bicihanîna vê fermana wî, sibeh û êvarê nanê ku li para wan diket, didan min û wan bi xwe jî bi xurmeyan îktîfa û bes dikir. Min jî şerm dikir û nan her dida yekî ji wan. Wî jî dest nedidayê û dîsa ew li min vedigerand.”[121]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xwestibû sîstema koletîyê ya ku hîn berî serdema wî hebû, ji holê rake. Wî di vê rê de gavên mezin jî avêtibûn. Wî, di her firsendê de azadkirina koleyan teşwîq dikir û digot; ev îbadetekî zehf mezin e. Wî gotiye; heke mûmînek di xusûsekê de şaş bike û kefaret li ser wî wacib bibe, di rêza pêşî de divê ew koleyekî azad bike. Dostê wî yê ji hemû dostên wî yên dîtir nêzîktir Ebûbekrê Siddîq [Xuda jê razî be] bi teşwîqkirina wî, qismekî mezin ji serweta xwe di azadkirina koleyan de xerc kiriye.

Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], rojekê bûbû şahid ku wa ye, Ebûzerr [Xuda jê razî be] ji ğefleta xwe bi koleyê xwe re tund hereket kiriye. Ew zehf ğemgîn bûbû, pirs jê kiribû û jê re wiha gotibû:

“-*Ya Ebûzerr, ma hê jî tu li ser adetê xwe yê cahilîyetê yî?!*” û ew wiha pê de çûbû, jê re gotibû:

121. Heysemî, VI, 86; Îbnû Hîşam, II, 288

*"Zirarê nede mexlûqê Xuda! Heke ew li pey serkehnîya te nayê, wî azad bike; bar, zêdeyî qeweta wî lê neke; heke tu bar lê bikî jî arîkarîya wî bike!"*[122]

Zilamekî koleyê xwe û carîya xwe li hev mehr kiribûn. Paşê wî xwest wan ji hev bide berdan. Koleyê wî, ev rewş li Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] erz kir. Mezinê me [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî ji xwediyê wî koleyî re got:

*"Heqê mehrkirin û berdanê ne di destê te de ye; tu têkilî wê nebe!"*[123]

Eshabê Kîram, li hemberî vê bûyerê û berpirsîyên wekî wê hatibûn rewşeke wisan ku her zeman azadkirina koleyan tercîh dikirin. Her ku diçû bi awayekî fiêlî koletî ji holê radibû û wisan berdewam jî kir û heta bi van rojan hat. Yanî Îslamê qeyd û benda koletîyê ji ser sukra însên rakiriye. Ji ber ku koletî yek ji hiqûqê herbê bû, naxwe ew yek ji heqîqetên tarîxa însanîyetê bûye.

Îslamê tim û daîm ji xwediyê kole re gotiye; "tu çi xwarinê bixwî, ji wê bide koleyê xwe jî. Tu çi vexwî, ji wê bide koleyê xwe jî. Tu çi cilan li xwe bikî, ji wan cilan li koleyê xwe jî bike. Barê zêde lê bar neke û karê zêde jî pê nede kirin. Tu îhtiyacên wî temîn bike!" Ji bo mûmînî azadkirina kole wek rêyeke baştira xilasîyê û emelê salih hatiye nîşandan. Îslamê ji bo koleyan heqê wisan anîne ku dema ew li ber çavan bên girtin û werin rîayetkirin, hema bibêje bûye ku bi kole nekirin

122. Buxarî, Îman, 22; Muslim, Eyman, 38; Ebûdawud, Edeb, 123-124
123. Îbnûmace, Telaq, 31; Teberanî, Kebîr, XI, 300

ji bi kolekirinê çêtir bûye û bûna xwediyê kole jî bi maneya cureyeke kole-bûnê hatiye.

Ev peyvên dawîn, yên mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di dema wefata wî de pirr manedar in:

"*Li nimêjê, bi taybetî li nimêjê miqate bin. Di bara koleyên di bin destê xwe de jî ji Xuda bitirsin.*"[124]

Yanî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi qasî îmkanan derîyê ketina hundirê koletîyê girtiye, derîyê derketina ji koletîyê jî heta bi dawîyê vekiriye û di her firsendê de jî azadkirina mirovên ku ketine rewşa koletîyê teşwîq û terwîc kiriye. Ma ji bo dawî-anîna li koletîyê metodeke ji vê baştir û sipehîtir heye?

Ji bo mirov bibîne ka Îslamê kole derxistiye çi cihî ev rastî nimûneyeke kafî û bes e:

Wekî ku melûm e, Bîlalê Hebeşî berî Îslamê kole bû. Lêbelê ew bi mislimanbûna xwe re bû sermûezzinê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], û meqamê "*pîrê hemû mûezzinan*" jê re hate dayîn. Çawa ku di medenîyeta me de ew mizgeftên me yên ku abîdeyên evdînîyê ne, ha li ser wan lewheyên ku di mehfîlên mûezzinan de cih digrin "*ya Hezretê Bîlalê Hebeşî*" hatiye nivîsandin, ev jî zindîtirîn xuyahîyên vê gotina me ye.

Dîsa dêya me Hezreta Xedîce, ew koleyê ku ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re hedîye kiribû Zeyd kurê Harîse [Xuda jê razî be], ew ji terefê mezinê

124. Ebûdawud, Edeb, 123-124/5156; Îbnûmace, Wesaya, 1

me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ve hatibû azadkirin. Ew sehabîyê mûbarek jî wek mûmînekî evîndar û aşiqê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bûye nimûneya çendîn fezîletan. Usame'yê kurê wî jî hê di temenê ciwanîya wî de ji terefê pêğemberê [dirûd û silavên Xuda lê bin] me bi xwe de wek "**Serdarê artêşê**" hatibû teyînkirin.

Li rexê din jî, **Tariq kurê Ziyad** fatihê Îspanyayê jî rabûrîya wî koletîyek bûye ku ew dihat kirrîn û firotin û toq dixistin stûyê wî. Lêbelê ew kole, bi xêra îslamê berjor bû û giha meqamekî wilo ku ji bo şeref, îzzet û heysîyeta însanîyetê mûnasib bû; ew bû fermandarê artêşên îslamê.

**Bi kurtasî;** Îslamê, kole xistiye cihê efendî. Ji xwe mûşrik jî ji ber vê sedemê li dijî îslamê derketibûn. Ma ew mûnkirên roja me, yanî yên sedsala 21'ê, ewên ku naxwazin îslamê qebûl bikin jî di wan de eynî xusûsîyet û taybetmendî nîn in? Ma di dinyaya îroyîn de ğesbkar çendîn mirovên azad wek êsîr nadin jîyandin? Ma sirf ji bo mêhtina îmkanên maddî maf û heqê însanên masûm û bêçare, hem jî bi navê azadîyê nayên ğesbkirin? Ma sîstema koletîya moderna bêrehm a ku însanîyet wê îro dijî û ew bi hinek nav û îfadeyên xweş û şîrîn tê guhan û tê bihîstin ji wan zulmên berê yên ku tarîxê ew nas kiribûn, bi ferq û cuda ye?

Naxwe ew îslama ku doh bi prensîpên bilind û berpirsîyan bi awayekî fiêlî koletî daxistibû sifrê, divê ew îro jî, bi têgihaya qîmet û fezîletên xwe yên ku însên bilind dikin, ji bo însanîyetê ji nû ve receteya xilasîyê be. Heke na, însanîyet; wê di pençeya wan têgihiştinên menfîetperest ên ku navê wan azadî û tetbîqata wan koletî ye, here helakê û perîşan

bibe. Ew prensîpên mêhtingerîyê li kuderê ne; ewên ku wekî pîrhevokan xwîna zeîfên li dinyayê dimijin û wan wek heyberên ku divê ji bo kolekirinê bên mehkûmkirin, dibînin? û ew prensîpên bilind û nemir ên îslamê li kuderê ne; ewên ku di bara êsîr û xizmetkaran de sereta û pîvan danîne û pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî bi her wesîle û navgînê ew li ser zimanê xwe wiha îfade dikirin:

"*Ew birayên we ne; hûn çi xwarinê bixwin, ji wê bidin wan jî, hûn çi vexwin, ji wê bidin wan jî!*"[125]

Ji ber vê yekê, wekî ku doh wisan bû, îro jî çareya yek û teka xilasîya însanîyetê mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ye. Pêbendbûna bi wî ye. Lewra çi dibe bila bibe, dixwaze bila însan zengîn-feqîr, petron-karker, efendî û xizmetkar be, wî her însan wek însan daye jîyandin, wî însan gihandiye heysîyeta însanîyetê û wî di vê rê de jî pîvan û endazên nehej û sağlem danîne. Wilo bûye ku heta hinek eshabê kîram hatine balê û jê pirs kirine;

"-Em çi qeder qusûrên xizmetkarên xwe efû bikin?"

Wî ev bersiv daye wan:

"-*Her roj wî heftê caran efû bikin!*"[126]

Merhemeta mezinê me behreke bêbinî bû û dilovanî, nezaket û zerafeta wî di bara ezîz girtina dilê mirovan de, ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî. Ev hedîsa wî, vê heqîqetê nîşan dide:

125. Muslim, Eyman, 36-38.
126. Ebûdawud, Edeb, 123-124/5164; Tirmizî, Birr, 31/1949

“*Dema xizmetkarê yekî ji we xwarina wî jê re bîne, heke ew pê re li ser sifrê nerûne, bila parîyek-du parîyan, yan jî luqmekek-du luqmeyan bidiyê. Lewra wî germahî û zehmetîya xwarinê kişandiye*.”[127]

Heke Xuda Teala xwestiba, dikarîbû rewşê berovajî bikira, yanî dikarî xizmetkarî bike efendî û efendî jî bike xizmetkar. Naxwe bila em ji Xuda Teala re hemd bikin û mûameleyeke xweş digel mirovên di bin emrê xwe de bikin.

**Mûamelekirina pêğemberê Xuda Bi Jinan Re**

Di serdema Cahilîyetê de mûameleyeke wisan xirab bi jinan re dihat kirin ku wê heysîyeta xanimtî û jînîtîya wan rencîde dikir. Bi endîşeya ku ewê bibin “fahîşe” zarokên xwe yên keçik bi zalimtî hê sağ dixistin bin axê û wilo dikuştin. Wan bi wijdanên xwe yên ku her wekî keviran hişkûhola bûyî, ji bo xwe ji mûsîbeteke ku cahilîyet bi xwe bûye sersedemê wê biparêzin, cînayeteke hê xirabtir dikir. Çawa ku Cenabê Heq Teala di Qur’ana Pîroz de di sûretê Nehl, ayeta 58’an de hal û rewşên wan wiha teswîr dike û dibêje:

“**Dema mizgînîya zarokeke keç ji yekî ji wan re dihate dayîn, ji kîna xwe rûyê wî rip-reş dibû!**”

Jin û keç bi awayekî biçûkxer û şereftêkdaner her wekî alav û cîhazekî leyistikê dihatin dîtin û ew biçûk dihatin xistin.

Bi fermana mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], hiqûqê jinan hate tesîskirin. Êdî jin di civakê

127. Buxarî, Et‘îme, 55; Tirmizî, Et‘îme, 44

de bû nimûneyeke îffet û fezîletê. Muessesa dayîktîyê jî bû sembola şerefê.

Jinê bi îltîfata Mûhemmedîyye ya di hedîsa şerîf de: "*Cennet di bin lingê dêyan de ye!*"[128] jî giha nirxê layiqê xwe.

Ev çi nimûneyeke sipehî ye, wê nezaketa ku mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo jinan xuya dikir, nîşan dide:

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li seferekê bû, xizmetkarek jî pê re bû, navê wî Enceşe bû. Wî stran gotin û kir ku hêştir xweş lezîyan.[129] Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hizirî ku wê bedena lawaza jinan a li ser van hêştirên ku lezê dikin siwar biêşe, teşbîheke zerîf kir û jê re got:

"*Ya Enceşe, diqqet bike, bila cam neşikên ha!*"[130]

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîseke din de jî wiha gotiye:

*"... Ez, her kesî ji zayî-kirina heqê du zeîfan, yanî yê sêwî û jinan didim hişyarkirin.*"[131]

Di hedîseke dîtir de jî wiha dibêje:

128. Nesaî, Cîhad, 6; Ehmed, III, 429; Suyûtî, I, 125.
129. Hêştir ji bo dengê xweş û stranan meftûn û dîn dibin. Hêştirvan jî ji bo hêştirên wan di meşê de xweş bilezînin, stranan ji wan re dibêjin. Ji vê re jî "Hîda" tê gotin.
130. Buxarî, Edeb, 95; Ehmed, III, 117
131. Îbnûmace, Edeb, 6

"*Bila mêrekî mûmîn ji mûmîna jina xwe hêrs nebe. Heke ew exlaqekî wê neecibîne, ew exlaqekî wê yê dîtir diecibîne.*"[132]

Lewra jin, di heqîqetê de ne strî-staneke ku mûsteheqa hêrs û buğzê be, lêbelê ew gulistaneke ku layiqa evîn û mûhebbetê ye. Hezkirina wê jî di esasê xwe de ji terefê Xuda Teala bi xwe de jê re hatiye bexşkirin û dayîn. Çawa ku Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di vê xusûsê de wiha ferman dike, dibêje:

*"Ji dinyayê jin û bêhna xweş bi min hatine hezkirin; nimêj jî bûye ronahîya çavên min."*[133]

Divê dane-hezkirina jinê bi Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], ewa ku cihê xuliqandinê ye, bi çavê ğefletê neyê nirxandin.[134] Divê were zanîn ku ev

---

132. Muslim, er-Rida, 61
133. Nesaî, Îşretun, Nîsa, 10; Ehmed, III, 128, 129
134. Ne mûmkin e, mirov di ti zewaceke mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de meyleke nefsanî û mûbtelabûnê bibîne. Ew di ciwanîya xwe de nebûye talibê ti qîzekê. Ew jinebîya 40 salî ya bi zarok Hezreta Xedîce teleba zewacê ji wî kiribû û wî jî teleba wê qebûl kiribû û zindîtirîn salên temenê xwe jî bi wê re derbas kirine. Zewacên wî yên di piştî wê de jî li zemanê yextiyarîya wî rast tên. [Di piştî 54' salîya wî de bûne] Ev hemû jî ne bi arzûya wî bûne, lê bi fermana îlahî tehqîq bûne, di wan de digel gellek hikmetên îlahî esas hedef hînkirina dîn li jinan bûye. Ji vê jî zêdetir, ev dêyên me yên ku pê re zewicîne pirranîya wan yextiyar, bi zarok û bêçare bûne.
**Welhasil;** serdema zewaca mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi gellek jinan re, ew hem di zemanê yextiyarîya wî de hem jî di dema zehf meşğûlbûna wî bi wezîfa pêğembertîyê re bûye. Ev jî bi eşkerehî nîşan dide ku ev zewac bi teyîneke îlahî û bi armanca ku hîn rehettir îslamîyetê bigihîne gellek girseyên mezintir û ferehtir, pêkhatine. Ji bo agahîyên hîn berferehtir li "Hezretê Mûhemmed Mûstefa", I, 130-140 ya Osman TOPTAŞ binêrin!

hezkirin, Cenabê Heq Teala ew xistiye fitretê û ew fitret jî kiriye pêpelingeke amade ji bo hezkirina îlahî. Naxwe ew li hemberî jinê bi ti awayan ne mûbtelabûneke suflî ye, tam berevajîyê vê, ew ji bo wan, dana wî bihayê bilind e ku wan heq kiriye. Jin, di tarîxa însanîyetê de bes di siha Îslamê de gihaye bihayekî wiha bilind. Ji bilî îslamê, ew hemû sîstemên ku dibêjin qaşo; em qîmet didin jinê, di rastîya xwe de ew bes wek melzema vîtrînê qîmet pê didin û di plana piştê de jî jinê bes wek pertaleke ekonomîk û nefsanî bikartînin, wê diperçiqînin û wilo serf û xilas dikin.

Alîyê nêrîna li jinê li ser vî esasî, divê îro însanîyet dîsa wê di zemîna bi bereket û ulwîya îslamê de bigre dest û wê di herk û mecra wê ya heqîqî de bide rûniştandin. Ji dema ku jin û mêr hatin xuliqandin û pê de ew du alemên fereh in û hev û din temam dikin. Lêbelê di vê hev-temamkirinê de ji terefê Heq Teala ve roleke bi bandortir ji jinê re hatiye dayîn. Roleke wisan bi bandor e ku her jin bi xwe ye, ewa ku civakê berbat dike û ya ku civakê abad jî dike. Li ser vî esasî, di nêrîna îslamê de perwerdekirina wê jina ku civakê abad dike bûye mezintirîn îdeal.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîsa şerîf de wiha dibêje:

*"Sê keç, yan sê xweh, yan jî du keç, yan jî du xwehên kî hebin, ew wan hîmaye bike, wan mezin bike, wan sipehî perwerde bike, wan bide zewicandin û lutf û qencîyên xwe li ser wan berdewam bike, ji wî re cennet heye."*[135]

135. Ebûdawud, Edeb, 120-121/5147; Tirmizî, Birr, 13/1912; Ehmed, III, 97

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîseke din de jî wiha dibêje:

“*Kî du keçên xwe heta baliğ bibin, mezin û terbîye bike, roja qîyametê ez û ew dê wiha li cem hev bin*.” û telîyên xwe ya şehdê û ya navê bi hev û din ve kirin.[136]

Paşê jî wî qîmetê jineke ku wek salîhe hatibe perwerdekirin jî wiha îfade kir û got:

*“Dinya pertaleke berwext e. Çêtirîn pertalê dinyayê jî jina dîndara salîhe ye.”*[137]

Bi giştî, tim û daîm di pişt serkeftina însanên mezin de jineke salîhe her hebûye. Mesela di teblîğa pêşîn a mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de desteka dêya me Hezreta Xedîce hebûye. Wê desteka pêşîn û mezintirîn daye wî û mezinê me jî ew di temamîya emr û temenê xwe de hîç jibîr nekiriye. Her wiha di muweffeqîyeta [serkeftina] Hezretê Elî de jî rola dêya me, Hezreta Fatima eşkere ye.

Yanî jina dîndara salîhe, mezintirîn û çêtirîn nîmeta dinyayê ye. Li ser vî esasî, mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] daye zanîn; ji bo mirovê ku dixwaze bibe mirovekî qenc, şert e ku ew li hemberî jinan qenc hereket bike. Ev rastî jî wiha îfade kiriye, gotiye:

136. Muslim, Birr, 149; Tirmizî, Birr, 13/1914
137. Muslim, Reda, 64; Nesaî, Nîkah, 15; Îbnûmace, Nîkah, 5

"*Ji hêla îmanê ve mûmînê mukemmeltirîn, ew e ku exlaqê wî xweş be. Qenctirînê we jî, ew e ku bi exlaqê xwe ji jinên xwe re qenctir in*."[138]

Digel ku rewş ev e jî, mezintirîn sefalet ew e ku mirov jinê, bes wek navgîneke zewqê bibîne, li wê wek pertaleke hewes û arzûyên nefsanî binêre û pê re bes bi taybetmendîyên wê yên cismanî û bedenî re elaqedar bibe. Ev nas-nekirina jinê ye. Ev, li hemberî wan xusûsîyetên bilind, ên ku Xuda Teala dane jinê, korbûn e. Ji bo jinê, çi rewşeke tehl, kambax û bêşerefî ye ku jina îro, di dinyaya xerckirina pertalan de hatiye tazîkirin, deşîfre-kirin û ew bes wek wasîte û navgîneke reklaman tê bikaranîn!

Lêbelê jin, divê wek mîmar û avasaza rasteqîne û heqîqî ya civakê were perwerdekirin. Divê ew bibe hemêzeke semawî ya ku Fatîhan mezin dike. Jin, mideteke me di zikê xwe de hildigrin. Paşê ew me di hemêza xwe de û li ser milên xwe hildigrin. Paşê ew heta bi mirinê jî me di qelbê xwe de hildigrin. Ha di xusûsa hezkirin û rêz lê girtina van dêyên heqîqî de ti heyber û mexlûqeke din a ku nezîr û hevkêşa wan be, nehatiye aferandin. Ew dêyên weqûr, ewên ku xwe ji bo malbata xwe weqf û hîbe dikin; ji bo hezkirineke berfereh, rêz-lê-girtineke kûr û spasdarî û teşekkureke heta emrê mirov hebe, layiq û babet in.

Herçî **Bêhna Xweş** e, hikmeta ku ew ji Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re hatiye hezkirin ev e; diltenikî û kûrahîyê dide rûh û can. Bêhna xweş, bayekî xweş

138. Tirmizî, Reda, 11/1162

ê hizûrê ye û ew li xweşîya melaîketan jî diçe. Hem jî ew nîşaneke paqijîyê ye. Lewra tişta ku paqij be, bêhna xweş jê tê. Çawa ku di her wext û zemanî de bêhna xweşa gulê ji çerm û tenê mûbarek ê Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dihat. Bêhna gulê wilo ji laşê wî dihat, her wekî ku gul bi xwe, ji dilopên xwêhdana mûbareka wî çêbûbû. Wî şahê gulan, dema destê xwe bi ser serê zarokekî de dibir û dianî, heta zemanekî dirêj bêhna miskê her ji serê wî zarokî dihat.

Herçî **nimêj** e, ew bûbû ronahîya çavên Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Lewra nimêj, hevpeyvîn û mûlaqata bi Xuda re ye û ew îbadetekî wisa ye ku her wekî mirov Xuda Teala bi çavên serê xwe bibîne, mirov wê wilo eda dike. Naxwe li ser vî esasî jî ew bînahîya çavan e.

### Mûamelekirina Pêğemberê Xuda Bi Sêwîyan Re

Cenabê Heq Teala, Resûlê xwe yê dilovan û hezkirî wek “**sêwî**”yek şandibû dinyayê, vê jî qedr û qîmetekî zehf cuda bi sêwîtîyê daye qezenckirin. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi rehm û şefqeteke mezin li ser sêwîyan dilerizî, ew hemêz dikirin.

Di Qur’ana Pîroz de jî di bara mûhafezekirin û parastina sêwîyan de gellek ayetên celîle mewcûd in.

Xuda Teala ji me dixwaze ku em li hemberî yetîm û sêwîyan zehf hessas û nazik hereket bikin. Ew, vê yekê jî wiha îfade dike, dibêje:

“**Herçî sêwî ye, zinhar tu wî bê qedr neke ha!**” [Mûameleya xirab pê re neke, wî neperçiqîne!][139]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîsên şerîf de jî wiha dibêje:

“*Di nav mislimanan de çêtirîn mal ew e ku têde sêwî hebe û mûameleya xweş jî pê re tê kirin. Di nav mislimanan de xirabtirîn xani jî ew e ku têde sêwî hebe û mûameleya xirab pê re tê kirin.*”[140]

*“Kî, ji nav mislimanan raje sêwîyekî û wî bibe ser xwarin û vexwarina xwe, bêşiwar Xuda dê wî bixe cenneta xwe; meger ku ew gunehekî bike ku nayê efûkirin, ew netêde ye.”*[141]

“*Kî, sirf ji bo rizamendîya Xuda destê xwe bi ser serê sêwîyekî de bibe û bîne, ji bo her mûyekî porê, yê ku destê wî lê ketibe, jê re xêr têne nivîsandin. Kî, mûameleyeke xweş bi keç-sêwîyekê, yan jî kur-sêwîyekî li cem xwe re bike, ez û ew di cennetê de dê wekî van herduyan bin!*” û wî herdu telîyên xwe; ya şehdê û ya navê ji hev cuda kirin.[142]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi israr wesîyet dikir, digot; wezîfa xwe ya lazim a civakî li hemberî dilên şikestî eda bikin. Çawa ku ew di vê xusûsê de wiha dibêje:

139. Dûha, 93/9
140. Îbnûmace, Edeb, 6
141. Tirmizî, Birr, 14/1917
142. Ehmed, V, 250

"*Kî, li hemberî keç-sêwî û kur-sêwîyê di bin mesûlîyeta xwe de xweş mûamele bike; ez û ew dê di cennetê de pev re bin*." Wî herdu telîyên xwe anîbûn cem hev.[143]

Sehabîyek hatibû cem pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], gilehê hişkbûna dilê xwe jê re dikir, wî ev wesîyet lê kir û jê re wiha got:

*"Heke tu bixwazî ku dilê te nerm bibe, xwarinê bide mirovê hejar û destê xwe bi ser serê zarokê sêwî de bibe û bîne!"*[144]

Dîsa ew mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ku zirweya şefqet û merhemetê bû, wiha dibêje:

"*Ez, ji bo her mûmînî ji nefsa wî jî li pêştir im û çêtir im. Naxwe dema kesek bimre, heke ew mal li pey xwe bihêle, bila ew mal ji ehlê wî re be. Lêbelê heke ew deynekî, yan jî sêwîyan li pey xwe bihêle, bila ew li ser min bin; xwedîkirina sêwîyan wezîfeya min e*."[145]

## Mûamelekirina pêğemberê Xuda Bi Heywanan Re

Her bizav û hereketa pêğemberê rehmê [dirûd û silavên Xuda lê bin] li ser esasên rehm û mûhebbetê bûye. Lewra ew, bi şefqet û dilovanî ji mexlûqatan nêzîk bûye û wî îhtiyaca her mûhtacî jî dabîn û temîn kiriye. Heta heywanan jî para xwe

143. Buxarî, Edeb, 24
144. Ehmed, II, 263, 387
145. Muslim, Cumû'e,43. Li Îbnmace, Mûqeddîme jî 7' binêrin

ji vê deryaya fereha mehebbetê wergirtiye. Lewra însanên serdema cahilîyetê heta li hemberî heywanan bi xwe jî bi bêwijdanî û bêmerhemet hereket dikirin. Wan hê dema ew zindî bûn bi bêmerhemetî perçe ji laşê heywanan dikirin û ew goştê wan dixwarin û pêşbazî û mûsabeqeyên “bi hev dan lê xistina heywanan” tertîb û organîze dikirin. Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dawî li van dîmen û menzereyên li dijî wijdanê anî.

Ebûwaqid el-Leysî [Xuda jê razî be] vedibêje:

“Dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hate Medînê, xelkê Medînê stûpişta hêştirê hê bi sağî jê dikirin, perçe ji kemaxên pez jêdikirin û ew goşt dixwarin.”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ev li wan qedeğe kir û ji wan re wiha got:

“-*Çi ji heywanê sağ hatibe jêkirin, ew di hukmê mirarê de ye, nayê xwarin*.”[146]

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] rojekê di rê de çavê wî bi kerekî rû daxdayî ket, ew pirr pê ğemgîn bû û wiha got:

*“Ma min ev qedeğe nekiribû? Hema kî dağ li vê dabe, bila leneta Xuda li wî bibare!”*[147]

Hinek mirovan çêlîkên kevokekê girtibûn, ew bi xwe re anîbûn û bi vî awayî kevoka dayîk êşandibûn, vêca pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wan re got:

146. Tirmizî, Seyd,12/1480
147. Buxarî, Zebaîh, 25

“*Kî, ev rebena ha bi girtina çêlîkên wê êşandiye? Zûka; çêlîkên wê lê vegerînin!*”[148]

Carekê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hê li Medînê îhram li xwe kiribûn û ji bo here Mekkê jî derketibû rê. Çi dema ew giha devera bi navê Usaye, wî ğezalek dît, ew li hev difetilî û li ber siha darekê raketibû. Mezinê alemê [dirûd û silavên Xuda lê bin], ji sehabîyekî xwe re got; li ber ğezalê bisekine heta her kes jê derbas bibe û here, bila ti kes wê dilxwehr û dem-tehl neke.[149]

Dîsa dema mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi artêşa mûhteşema xwe ya deh hezar neferî re diçû fetha Mekkê, wî dêlesekek dît, wê xwe bi ser cewrikên xwe de dabû û ew şîr didan. Wî derhal gazî sehabîyê xwe Cû‘eyl kurê Suraqe kir û jê re got; li ber serê vê heywanê nobetê bigre û tenbih lê kir, jê re got; bila ti kes ji artêşa îslamê wê û cewrikên wê netirsîne.[150]

Rojekê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hêştirek dît, ji zeîftî çermê wê bi hestîyên wê ve zeliqîbû, wî ji xwediyê wê re got:

*“Hûn di bara van heywanên ku xeber nadin de ji Xuda bitirsin! Wan xwedî bikin û wilo li wan siwar bibin û wan xwedî bikin û wilo wan serjê bikin û goştê wan bixwin!”*[151]

148. Ebûdawud, Edeb, 163-164/5268
149. Mûwette, Hecc, 79; Nesaî, Hecc, 78
150. Waqidî, II, 804
151. Ebûdawud, Cîhad, 44/2548

Dîsa pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] çûbû nav bexçê mirovekî Ensarî û li wir devehek dîtibû. Dema devehê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dît, ew nalîya û hêstir ji çavên wê barîn. Vêca mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] çû cem devehê û bi şefqet destê xwe bi ser pişta guhê wê de bir û anî, deveh jî hedinî.

Paşê Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pirs kir, got:

“*-Ev deveh, ya kê ye?*”

Xortek ji ehlê Medînê jê nêzîk bû û jê re got:

“-Ya Resûlellah, ev deveh, ya min e.”

Mezinê me Fexrê Kaînatê [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

*“-Ma tu, di bara vê deveha ku Xuda Teala ji kerema xwe ew daye te de, ji Xuda natirsî? Lewra wê ji min re gileh kir, got; ew min birçî dike û min zehf diwestîne.”*[152]

Dîsa rojekê dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di rê de dimeşî li komeke însanan rast hat. Ew li heywanên xwe siwar bûbûn, sekinîbûn û wilo pev re sohbet û mehebbet dikirin. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wan re got:

*“Heywanên xwe newestînin û rind li wan siwar bibin [dema hûn li wan siwar nebin jî] îstîraheteke xweş bidin wan. Wan ji bo şiteğalîyên xwe yên di rê û bazaran de jî nekin kursî*

152. Ebûdawud, Cîhad, 44/2549

*[li ser pişta wan siwar nebin û wilo sohbet nekin]. Lewra gellek heywan hene ku ew ji siwarên xwe çêtir in û ew ji siwarên xwe bêhtir zikrê Xudayê Mezin û Bilind dikin!.*"[153]

Dîsa mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li zilamekî rast hatibû ku wî mêşin serjê dikirin. Zilamî mêşina xwe ji bo serjêkirinê li ser erdê gêr kiribû, ew wilo hiştibû û lê dixebitî ku kêra xwe tûj bike. Mezinê me Resûlê Ekrem li hemberî vê bizava tund û bê hest ew zilam îqaz kir û jê re got:

*"Ma tu dixwazî heywanê gellek caran mirinê pê bidî tamkirin? Ma çênabe ku tu berî heywanê li erdê gêr bikî, kêra xwe tûj bikî?"*[154]

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîseke şerîfa xwe de wiha dipirse, dibêje:

*"Ma ez ji we re bibêjin, cehennem ji kê dûr e û kî jî ji cehennemê dûr e?"* Sehabîyan jê re got; belê, ji me re bibêje, ya Resûlellah!

Paşê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji wan re gotibû:

*"Ew kesên nazik, diltenik, dilovan, destevîl û sernerm in."*[155]

153. Ehmed, III, 439
154. Hakim, IV, 257, 260
155. Ehmed, I, 415

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] rewşa mirovên bimerhemet û bêmerhemet jî wiha eşkere dike, dibêje:

*"Jineke gunehkar, li çolê sekek dîtibû ku wî ji tîbûna xwe bi zimanê xwe sêlh dialîst. Ew lê hate rehmê, jê re pêlava xwe ji bîrê tije av kir û tîbûna wî bir. Cenabê Heq Teala jî gunehên vê jinê efû kirin. Jineke din jî kitika xwe piştguh kiribû û ew birçî hiştibû. Jê re destûr nedabû heta ku ew ji kêzikên erdê bixwe. Paşê kitik ji nêza mir. Ew jin jî bi sedem bêmerhemetîya xwe bû rêwîya cehennemê!*"[156]

Mezinê me [dirûd û silavên Xuda lê bin], bi van pîvan û endazan ji civaka cahilîyetê nifşa "Esrê Seadetê" anîbû meydanê. Ew kesên ku zemanekî mûameleya wan bi însanan re jî xirab bû, heta ewên ku hê bi sağî keç-biçûkên xwe binax dikirin û wilo dikuştin, di encamê de ew dibûn qutb û cemsereke merhemet û şefqetê ku rehm û şefqeta wan digiha heta bi heywanatan jî.

Lewra pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] usweyê hesene/nimûneyê mûkemmeltirîn ji wan re hatibû şandin. Wî heta heqê çûkên biçûçik jî li ber çavan digirt û ew bi diltenikî û hessasîyeteke wisan bêterîf distirehan.

Heta dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ferman li sehabîyên xwe kir, ji wan re got; heywanên bi zirar, yên wekî dûpişk û maran bikujin jî, ji wan re gotibû; wan bi derbeke tenê bikujin, ji bo ew zêde ezîyetê nekişînin.

156. Li Buxarî, Enbîya, 54; Muslim, Selam, 151, 154; Birr, 133; Nesaî, Kusûf, 14'an binêrin.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîsa şerîf de dibêje:

*"Kî sûsemarê bi derba pêşî bikuje, jê re sed sewab tê nivîsîn. Kî wê di derba duduyan de bikuje, jê re sewabeke ji ya pêşî kêmtir tê nivîsîn. Kî wê di derba siseyan de bikuje, jê re sewabeke ji vê jî hindiktir tê nivîsîn."*[157]

Tewsîye-kirina merhemetê heta di kuştina heywanên bi zirar de jî, ma ne nimûneya şefqeteke wisan zêde ye ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wê?

❀

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi sebeb vê evdînî û exlaqê bilind ê ku jîyabû, hîç ti wextekî ji medh û pesnan hez nedikir. Wî nîmetên ku Xuda Teala dabûnê dijmartin û bi tewazûyeke mezin digot: "*La fexre: Pesnê xwe dan nîn e!*"[158]

Serkehnîya ğurûrê, pesnê xwe dan û xwe teqdîr-kirin e. Ev rewş, yek ji wan sedeman e ku dike însan, bi ser xwe ve biçe. Digel ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi şereftirînê mirovan bû û bi medhê xwe jî gihabû, dîsa wî ji sehabîyên xwe re wiha digot:

"*Ji min re bibêjin «Evdê Xuda û pêğemberê wî ye*»!"[159]

Di însanî de taybetmendîya evdbûnê heye. Însan, ya ji tiştan û menfîeta xwe re dibe evd, yan jî ji Rebbê xwe re dibe

157. Muslim, Selam, 147; Ebûdawud, Edeb, 162-163/5263
158. Tirmizî, Menaqib, 1; Îbnûmace, Zuhd, 37; Ehmed, I, 5, 28
159. Buxarî, Enbîya, 48; Ehmed, I, 23

evd. Evdbûna ji Rebbê xwe re, însanî azad dike û nahêle ew ji nefsa xwe û menfîetên xwe re, yan jî ji tiştan re bibe kole.

Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di wê hevkêşîya ku di navbera alîyên hevdij ên heyatê de danîbû de ti biçûktirîn qusûr, têrê-nekirin û kêmasî nîşan nedaye. Ne mûmkin e, mirov di tarîxê de karibe nimûneya kesayetîyeke duyema din bibîne.

Rast e mirov, di nav civakan de li hinek şexsîyetan rast tê ku di hinek beşên heyatê de meharet û serdestîya wan heye. Lêbelê mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] yek û tek nimûne ye ku ev çêtirbûn tev di kesekî de kom bûne.

**Welhasil** ew, di her xusûsê de ji navbera mirovên ku hatine û çûne tevan nimûneya kesayetîyekî mûstesnatirîn û bilindtirîn bûye.

Wî, di emr û temenê xwe de:

1. Di evdînîyê de,

2. Di mûamelatan de,

3. Di exlaq de, ji temamê însanîyetê re xeslet, fezîlet û hewldan... Bi kurtasî, sipehîtîyên maddî-menewî yên wisan mûhîm hedîye kirine ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî.

Lewra ew, rêberê seadetê bûye û bi fitreta xwe têgihabû ku divê ew li pêşberî alemê ji ummeta xwe re bibe kesayetîyê nimûneyî yê bimesûlîyet.

Di vê navberê de hessasîyeta wî, di bara nimêjê de di ser her tiştî de bû. Wî demeke hindika şevê bi xewê derbas dikir.

Wicûda mûbareka wî di pirranîya wextan de doşek nedidît. Dema her kes bi şev di xewa şîrîn de bû, di sicûdê de hêstir ji çavên wî dibarîn. Wî di dawîya emr û temenê xwe de, wê wexta ku nexweşîyên wî gihabûn sefhe û qunağên paşîn jî, heta ku wî dikarî qeweta xwe bide hev, ew ji hucra seadeta xwe derdiket, diçû mizgeftê û nimêja xwe bi cemaetî eda dikir.

Ebdûllah kurê Şixxîr [Xuda jê razî be] xuşû û tirsa mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ya di nav nimêjê de wiha vedibêje:

"Ez carekê çûbûm dev mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Wî nimêj dikir û ji ber girî dengekî wekî dengê beroşa ku dikele, ji singa wî dihat."[160]

Digel ku ji bilî rojîya Remezanê ti rojîyeke din li ser mûmînan nehatibû ferzkirin jî, dîsa heyvek, yan jî hefteyeke ku mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] têde rojî negirtibe û ew wilo bê rojî derbas kiribe, pirr nadir û kêm e.

Dêya me Hezreta Aîşe dibêje:

"*Resûlê Ekrem [dirûd û silavên Xuda lê bin] carina tim rojî digirt. Wilo ku me zen dikir ku êdî ewê careke din dev ji rojîyê bernede*."[161]

Wî, di rojên sêzdeh, çardeh û pazdehên her mehê de, di Şewwalê de şeş roj û di Mûherremê de jî rojîya aşûrayê îhmal

160. Ebûdawud, Selat, 156-157/904; Nesaî, Sehv, 18
161. Buxarî, Sewm, 53

nedikir. Ji van zêdetir jî wî rojî-girtina duşem û pêşemê ji xwe re kiribû adet.

Bi nazilbûna ayeta Zekatê jî, ferman li mûmînan hatibû kirin ku ew zekatê bidin û ji bo xêrê înfaqê bikin. Lêbelê înfaqa sipehîtirîn jî pêşî wî bi xwe ew tetbîq dikir.

Ew, fermana cenabê Heq Teala:

"**... Ew, ji wî rizqê ku me daye wan di rêya Xuda de înfaq dikin**."[162] bi awayekî sipehî dijî; wî pesnê wî malê ku li xêran dihat xerckirin dida û pesn û medhê wan mûtteqî û bazirganên ku malên xwe di rêya Xuda de înfaq dikirin jî, dida.

162. Beqere, 2/3

# Pîvanên Di Stêran De

Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xusûsîyete sade ji zatê alîyê wî re mexsûs hebû; wî tiştek ji pertalên dinyayê li cem xwe nedihişt. Li dev wî çi hebû, wî ew hemû di rêya Xuda Teala de xerc dikirin.

Sehabîyê mezin Ebûzerrê Ğifarî [Xuda jê razî be] vedibêje:

Em bi Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re li kenarê Medînê di erdeke bi kevir de dimeşîn. Çîyayê Uhudê derket pêşberî me. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji min re got:

*"-Ya Ebûzerr!"*

Min jê re got:

"-Ferman bike, ya Resûlellah!"

Wî got:

*"-Heke bi qasî vî çîyayê Uhudê zêr li cem min hebin, ez bi vê keyfxweş nabim. Ji bilî ya ku ez ji bo edakirina deynekî veqetînim ew ne têde ye, wekî din ez naxwazim li cem min sê roj bi ser dînarekî de jî derbas bibin."*[163]

163. Muslim, Zekat, 32; Buxarî, Îstikraz, 3

Wî di hinek wextan de rojîya wîsalê digirt; du rojan, carina jî sê rojan li pey hev rojî digirt û hîç tiştek nedixwar, venedixwar. Dema hinek eshabê kîram jî xwest eynî tiştî bikin, wî ji wan re got:

"*Qeweta we ji vê re nîn e*." mena wan ji vê dikir.[164]

Ji ber vê, divê em vê xusûsê îfade bikin; wekî ku em zanibin mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji me re rêber û nimûneya yek û tek e, heta tu bibêjî bes, mûhîm û zerûrî ye ku em pîvan û endaza xwe di nimûne girtina wî de jî zanibin. Lewra fiêl û bizavên wî ji du kategorîyan pêktên:

1. Hinek sade xasê wî ne,
2. Hinek ji bo her kesî şamil in.

Li ser vî esasî, em ne mûkellef in ku fezîletên ulwî yên xasê şexsê wî jî ji xwe re nimûne bigrin. Ji xwe hal û bizavên wî yên bilind, her wekî cure pîvanên di stêran de ne, û taqeta me jê re nîn e, em bizavên bi vî rengî nîşan bidin. Lêbelê hal, bizav û peyvên wî yên ku dikevin beşa duduyan, bi qasî amadehî û taqeta xwe divê em di temamê emr û temenê xwe de wî teqlîd û teqîb bikin û em berpirs û mûkellef in ku li ser rêç û şopa wî bi nûrî bimeşin.

Heke çi qeder di kemalata beşerî de ti kes negihîje sewîya mezinê me Hezretê Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî, lêbelê her kesê ku li ser rêç û şopa wî diçe,

164. Buxarî, Sewm, 48

divê bi qasî qabilîyet û qeweta xwe di alema xwe de bibe "Mûhemmed"ekî biçûk.

Çawa ku milletê me, îlhama xwe ji vê fikra nazik û tenik girtiye û navê "**Mehmetçîk**=**Mehmedok**" daye leşkerê qehremanê xwe yên ku berevanîyê ji welatî dikin.

Bila em jibîr nekin ku ji ber pîvana zekatê maddî ye, em dizanin ka emê bi çi qeder înfaqkirina wê mesûlîyet û berpirsîya xwe bînin cih. Lêbelê ne mûmkin e, em bi awayekî temam pîvan û endaza berpirsîya qabilîyet û îmkanên dîtir ên ku cenabê Heq Teala ji me re îhsan kirine, bizanin. Ji ber vê sedemê heta bi nefesa dawîya xwe, bi qasî taqeta xwe em mecbûr in ku heyateke evdînîyê bijîn.

Di vê xusûsê de ji bo em halê xwe bikişînin û biwezinînin, ji me re sağlemtirîn pîvan Ensar û Mûhacir in ku ew bi perwerdeya menewîya pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] terbîye bûne û gihane. Wan, li gorî şert û mercên wî zemanî ji bo bedela nîmetên li ser xwe ji stûyê xwe eda bikin heta bi Çîn û Semerqendê rêwîtî kirine, çûne. Wan bi wecda îmanê di xizmet û hewldanên xwe de ti caran westan, kerixîn û hîlet jêçûn nîşan nedaye.

# Beşa Siseyan

- *Di Şopandina Resûlûllah De Salihbûna Qelbî*
- *Bi Eşqê Pêbendbûn û Peyrewbûna Resûlûllah*
- *Eyneya Exlaq û Eşqa Wî: Esrê Seasdetê*
- *Terennumên Şewitî yên Mehebbeta Resûlûllah*
- *Selewatên Şerîf*

# Di Şopandina Resûlûllah De Salihbûna Qelbî

Eshabê Kîram [Xuda ji wan razî be] bi awayekî baş û pêwîst ji uswe'yê hesene, yanî ji kesayetîya bênimûneyî ya mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] îstîfade kiribûn. Ji bo em ji exlaqê bilind ê wan nêzîk bibin, divê em bi qelbê xwe bigihîjin salihbûneke zehf bilind. Lewra Xuda Teala di bara uswe'yê hesene de wiha dibêje:

"**Sûnd be ku ji we, ji bo wan mûmînên ku çavpêketina Xuda û roja axretê hêvî dikin û zehf zikrê Xuda dikin, di Resûlûllah de usweyeke hesene** [nimûneyeke mûkemmeltirîn] **heye**."[165]

Wekî ku hate dîtin, di vê ayeta celîle de hatiye eşkerekirin ku herdu xusûs: "**Hêvîkirina çavpêketina Xuda û roja axretê**" û "**zehf zikrkirina Xuda**" giringtirîn û mûhîmtirîn pêpeling in, ji bo mirov her wekî pêwîst para xwe ji kesayetîya nimûneyî ya Resûlûllah wergire.

Îbadet, di wext û zemanên diyar de tên îcra û edakirin. Lêbelê parastin û mûhafezekirina îmanê her tim û daîm pêwîst e. Her gav û dem, ji bo edakirina bedelê îmanê ji Cenabê Heq Teala re û gerîna li rizaya wî, wext e. Şert e ku mirov her

165. Ehzab, 33/21

wext û anê di halê zikrê daîmî de be, ji bo di vê xusûsê de lawazîyek di qelbê mirov de hasil nebe, ji bo mirov bi awayekî layiq û durust li dijî wesweseyên nefsanî û şeytanî berxwedan û mûqawemetê nîşan bide û ji bo mirov ti caran Cenabê Heq Teala ji bîr nake..

Cenabê Heq Teala di ayetên cuda cuda de wiha dibêje:

"**Gelî mûmînan! Zehf zikrê Xuda bikin**.."[166] Lêbelê ji ber ku di van ayetan de miqdar û hijmareke diyarkirî nehatiye eşkerekirin, naxwe ji fermana zikrê meqsûd "**zikrê mûkemmel**" e.[167] Di vê rewşê de divê însan, di her firsendê û bi qasî taqeta xwe tim û daîm zikrê Xuda Teala bike.

Xuda Teala di ayeteke dîtir de jî wiha ferman dike, dibêje:

**"...Bêguman Xuda, kê bivê ji rê dixe û kesê li dînê wî vegere, wî jî tîne ser hîdayetê; her ev in, ewên ku îman bi Xuda anîne û dilên wan bi bîranîna Xuda rehet û aram dibe. Bila haya we jê hebe ku dil bi bîranîna Xuda aram dibin."**[168]

Bêşiwar zikrkirina Xuda, bes ne dubare-gotina lefzê Xuda Teala tenê ye; lêbelê divê zikrê Xuda cihê xwe di qelb de tam bigre ku ew merkez û navenda hest û tehessusê ye. Divê însan li dev zikrê Xuda hest bi zewq û lezzetê bike. Netîceya sağlem ev e; zikrê Xuda û ketina wî di qelbê mûmînî

166. Ehzab, 33/41; li Cumûe 10'an jî binêrin!
167. Dema di piştî fermanekê de îzahatek li ser tixûb û miqdarê wê neyê kirin, hingê bi wê fermanê asta çêtirîn û bilindtirîna wê hatiye qesdkirin.
168. Re'd, 13/27-28

de nexweşîyan ji dilê wî derdixe û dibe û qelb ji gemar, jengar û qirêjê paqij dike. Dilê wî ji nûrê tije dike. Riqqet, nezaket, zerafet û hessasîyetê pê dide qezenckirin û wî ji bo hikmet û sirrên îlahî jî dixe teşne û tî. Dema nebz û avêtinên dil li gorî Heq Teala bibin, hingê nîyet û emel jî biha û sewîyê qezenc dikin.

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîseke şerîfa xwe de dibêje:

"*Elametê hezkirina ji Xuda, hezkirina ji zikrê Xuda ye..*"[169]

Hezker, ti caran hezkirîyên xwe ji bîr nakin; wan ji ser zimanê xwe naxin û wan ji qelbên xwe jî dernaxin. Ew dilên ku dixwazin zewq û sefaya îmanê bijîn, ew di dilê xwe de zikr her didin dewamkirin. Ew şipya, rûniştî û li ser teniştên xwe gêrkirî zikrê Xuda dikin, selewatan didin û xwe di hikmeta hûr û nazenîna xuliqandina erdê de noq dikin.

Ew wiha dibêjin:

"**...Ya Rebbî! Te eva ha pûç neaferandiye. Tu ji nuqsanîyan pak û mûnezzeh î. Me ji ezabê êgir biparêze**!" [170]

Ew dilê ku ev kûrahî û hûrahî qezenc nekiribe, ew Xuda Teala naxwaze. Çawa ku di ayeta 22yan ji sûretê Zumer de wiha hatiye gotin:

"…**Xwelî li wan be ku di bara bibîranîna Xuda de dilên wan hişk û hola bûne!**"[171]

169. Suyûtî, II, 52
170. Alî Îmran, 3/191
171. Zumer, 39/22

Di ayetê de dide zanîn ku ew însanê ji zikrê Xuda dûr bûbe, wî heysîyeta însanî ya xwe jî winda kiriye û ji dest daye.

**Welhasil;** ji bo mirov bibe pêbend û peyrewê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û wekî pêwîst ji wî îstîfade bike, divê mirov qelbê xwe ji mehebbeta îlahî tije bike. Divê mirov dilê xwe ji mehebbeta mirok û fanîyan xwerû û vala bike. Divê mirov xwe bi nîyeta gihiştina Xuda û axretê û zikrûllah tezyîn bike, bixemilîne..

# Bi Eşqê Peyrewbûn û Pêbendbûna Resûlûllah

Encama hezkirin û evîneke heqîqî ku ji bo mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tê hiskirin, ew e ku mirov toza ber pêyê wî bixe taca serê xwe, mirov ji dil û can îtaeta wî bike û jê re teslîm bibe.

Lewra ew şexsîyetekî wisa ye ku bi her alîyên xwe ve ji bo însanîyetê rehmek ji serab û leylanê ye. Di vê xusûsê de, ev ayeta pîroz çi xweş îzah dike ka dilê wî çi qeder ji mûmînan re tije şefqet û merhemet e:

"**Sûnd be ku ji we bi xwe pêğemberekî wilo ji we re hatiye ku ezîyet-kişandina we pê ne xweş tê û dilê wî gellek bi we ve ye. Ew ji mûmînan re pirr bi şefqet û merhemet e**."[172]

Hedîseke şerîfa ku şefqet û merhemeta wî ji ummeta wî re nîşan dide, wiha ye:

*"Gelî mûmînan! Xuda we bixe nav êminî û asayîşê! We li ber çavan bigre! We ji xirabîyan biparêze! Arîkarîya we bike! We bilind bike! Rê ji we re nîşan bide! We bixe êminîya xwe! We ji her cure bê şensîyan biparêze û dînê we ji bo we biparêze!.."*[173]

172. Tewbe, 9/128
173. Teberanî, Ewset, IV, 208; Ebû-nûeym, Hilyetul Ewlîya, Beyrût 1967, IV, 168.

Ew rehmeke wisan bû ku bi fiêl û kirinên xwe, bi peyv û gotinên xwe û bi kamilbûna exlaqê xwe însanîyet hemû dixist ber xwe, ew hemêz dikir û rê nîşan dida. Di rêya hîdayetê de her cure meşeqqet û renc û azara mezintirîn li ser pişta wî bû. Ji bo ummeta wî bigihe rehm û hîdayetê ew di nav sebr, semağ û hewldaneke wisan de bû ku carina ji bo ew xwe xirab neke, şîyarî û îqaza îlahî jê re sadir dibû, dihat:

"**Naxwe heke ew bi vê peyvê** [kitêbê] **îman neyênin** [û ji ber vê herin helakê] **tu, ji pişt wan ve ğemgîn dibî û dikî ku xwe bibî helakê**."[174]

"[Resûlê min!] **Ji ber metirsîya ku ew îmanê nayênin tu dikî xwe bikujî!**"[175]

Ev ayetên pîroz delîleke zehf eşkere ye ku mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wek lazimîyeke şefqet û merhemetê dixwest her însanê ku li dinyayê dijî bawerîyê bi Xuda bîne û xwe ji ezabê cehennemê xilas bike.

Li hemberî vê şefqet, merhemet û mehebbeta fereha ku Resûlûllah ji ummeta xwe re his dikir, divê em wek ummeta wî tefekkur bikin ka em çi qeder bersiva vê hezkirinê didin.

**Bi rastî pîvana hezkirina me ji Resûlê Xuda, bi vê xuya dibe ku em Qur'anê û sunneta Resûlê Xuda ji xwe re bikin rêber û em halê xwe jî bikin wekî halê wî. Gelo eshabê kîram, ewên ku jê hez dikirin û di ber wî de her tiştê xwe feda dikirin, ew çawa his dikirin û çawa nas dikirin? Çawa**

174. Kehf, 18/6
175. Şûera, 26/3

**halê wan bûbû wekî halê wî? Exlaqê wî, xwe çawa di jîyana wan de dabû eks û xuyakirin? Gelo em di kudera van halan de ne? Divê em hezkirina xwe ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi van pîvanan bikişînin û em dilên xwe jî bi exlaqê wî bixemilînin. Divê em nefsa xwe ji gunehên xwe, xetayên xwe, kêmasîyên xwe û îsyankarîyên xwe, bi exlaqê tertemîz ê wî yê wekî ava zemzemê bişon. Divê em bi mene û hikmeta heyata mûbareka wî vejîneke menewî bijîn.**

Sirra ku mirov digihîne Xuda, ev e; mirov bi dil-xalîsane ji kitêba Xuda û sunneta senîyye ya Nûra Hebûnê, yanî ji exlaq û bizavên bilindê wî nêzîk bibe. Mirov bi mehebbet, ji tiştên ku Xuda û pêğemberê wî jê hez dikin, hez bike û mirov ji zid û dijberên wan jî nefret bike.

Lewra mehebbetên îlahî, dil zindî dikin, wî bi sihhet û tendurust dikin û dikin ku îstîqameta wî li ser xêrê sabit dimîne. Mehebbet û dijbera wê nefret, di eynî demê de herdu pev re di dilekî de nabin. Lêbelê ji ber ku dil valahîyê qebûl nake, nebûna yekê ji bo hebûna ya din sedem e. Ferqa di navbera van herdu hevdijan de jî bi qasî mesafa navbera ‘ela-ya ‘îllîyyînê û esfela safilînê bê dawî ye.

**Şair Kemal Edîb Kurkçuoğlû** mûmînên ku ji sunneta pêğemberê Xuda û mehebbeta wî ğafil mabin bi vê beyta xwe wan çi xweş îrşad û îqaz dike:

“*Hey wax, hey wax! Dûrbûna ji îltîfatên Hezretê Pêğember, helbet wek xusran ji bo însanê ğafil bes e!..*”

Rebbê me, me bike ummeteke layiqê wî ku bi mehebbetê bûbe pêbenda wî! Lewra ew aso û ufûqeke merhemet û şefqetê bû ku ti kes nikare xwe bigihîne gwîzeka wî!..

Bi rastî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi hemû hêz û taqeta xwe ji bo hîdayeta mirovan hewl dida, wan jî bi keviran lê dida û heqaret lê dikirin. Lê dîsa wî li hemberî vê neqencîya wan dûayên xêrê ji wan re dikirin. Çi dema Zeyd kurê Harîse li hemberî vê rewşê ji Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re got:

“-Ya Resûlellah, ew vê zulma giran ji bo we rewa dibînin... Ma hûn hê jî dûa ji wan re dikin?” Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

*“-Ma ez karim çi yê din bikin? Lewra ez ne ji bo ezabê; lê ji bo rehmê hatime şandin...”* Ma dûakirina wî ji bo hîdayeta wan nabe şahid ku ew di zirweya fedakarîyeke bilind, wefakarî, dilbaşî, merhemet û şefqeteke wisan de ye ku ti kes nikare bigihîje wê?

Bi rastî bi pêğembertîya mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] beşerîyet giha mûkemmeltirîn rêberê bilindê xwe yê hîdayetê. Ji ber vê ye ku ewên heta vêga jîyaneke xwedbînî û nefsanî dijîn, ew di cihekî wisan de ne ku berpirsîya wan ji berpirsîya wan mirovên ku berî ev kesayetîya nimûneyî were jîyaneke cahilî dijîyan, zehftir e.

Ji vî cîhetî ve, di roja me ya îro de însanîyet bi pirranî di bin sulteya [otorîteya] nefsê de dijî û ji qewetê re ram û desteber bûye. Ji lewma îhtiyaca me zehf bi înşakirina şexsîyetekî nimûneyî heye ku di rewîşt, exlaq û kesayetîya

xwe de bişibihe şexsîyeta nimûneyî ya wî Nûrê Hebûnê! Di serdemên tarîxa mûhteşema me de mezintirîn tesîrker, hebûna wan mûmînên baş bûye, ewên ku emelê salih dikirin û ji bo wî pêğemberê alîcenab warisên heqîqî bûn. Ha wan, kesayetîyên nimûneyî ji civakên xwe re pêşkêş kiribûn.. Hal-hal e, dema em li halê roja xwe ya îroyîn dinêrin, em bi çavên serê xwe xusrana ku ummeta me di alîyê menewîyatê de dijî temaşe dikin. Lewra şexsîyetên nimûneyî yên wekî wan şexsîyetên ku me behsa wan kirî, hindik in.

Ji nû ve, ji bo em bigihin asta wan qehremanên wecd û îmanê, ewên ku bi taybetî di tarîxa me de li pey rêç û şopa mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] çûne û dilên wan tije heyecan bûye, divê dubare em bibin xwedî wan însanên abîde û nimûneyî.

Ji ber vê jî, divê em wan bibihîzin, wan fehm bikin û ji alema dilî ya wan para xwe wergirin. Yanî divê em bizanin ka wan çawa bi vê dinyaya fanî re mûamele kiriye, wan çawa eql, îz'an, îdrak û can û malê ku Xuda Teala dabûye wan bikaranîne ji bo rêya seadetê hem ji xwe re, hem jî ji însanîyetê re dane vekirin.

# Eyneya Exlaq û Eşqa Wî: Esrê Seasdetê

Terbîye'ya zahirî û tesîra batinî ya mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] îksîrekî wisan bû ku wî civaka cahilî ya berîya hingê nîv-wehşî û bi pirranî jî ji însanîyetê bêxeber, di mideteke ewqas kurt de gihand mertebeyeke ewqas pêşketî ku xeyalkirina wê jî ne mûmkin bû û heta vêga jî tarîxa însanîyetê tev ğibte jê dike û xwezîya xwe pê tîne.. Ew jî civaka "**Sehabîyan**" e. Wî ew di bin yek-dînî, alayekê, hiqûqekî, çand û îrfanekê, şehristanî û medenîyetekê û îdare û desthilatîyekê de hev temam dikirin û dibûn yek.

Wî, însanên cahil û canî kirin mirovên zana; kesên wehşî kirin medenî; kesên rewîşt mucrim û suflî kirin mûtteqî. Yanî wî ew kirin mirovên ku bi hezkirin û tirsa Xuda dijîyan û fewqel-ade salih bûn..

Civaka cahilî ya ku di dirêjahîya esr û sedsalan de zilamekî tenê jî perwerde nekiribû ku hêja be, ew bê qeydkirin. Bi xêra îrşad û rûhanîyeta mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] gellek însan ji nav wan derketin ku ew bi sifetên ulwî û bilind hatibûn xemilandin. Van jî feyz bi xwe re dibirin û diguhastin çar kenarên dinyayê û ew bi xwe bûne meşele û çiraya îman, îlm û îrfanê. Ew nûra ku li çolê peya bûbû, ebedîyet xistibû bin siha xwe, heq, edalet û feyz û bereket li însanîyetê tevî belav kirin. Sirra "**Lewlake**

**lewlake**”[176] zahir û xuya bû. Bi vî awayî, armanca xulqiyeta kaînatê hate cih.

Ew pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ku ji bo alema însanîyetê mûkemmeltirîn nimûne bû, ew însanê esra seadetê yên ku bi terbîyeya wî gihabûn jî civakeke marîfetê bûn. Ew serdem, serdema tefekkureke kûr bû, serdema hê ji nêzîktir ve naskirina Cenabê Heq Teala û pêğemberê wî bû. Sehabîyan tewhîd xistibû navenda raman û îdeala xwe. Ji lewma ew ji bo, ji dilên xwe avêtina menfîetên dinyewî, yanî ji dilên xwe avêtina îlah û pûtan, biserketin, mûweffeq bûn. Mal û can ji bo wan ketibû hukmê wesîle û navgînê. Lezzeta îmanê hate te‘mkirin. Merhemet fereh bû. Xizmet bû terzê jîyanê. Fedakarîyeke mezin û şexsîyeta îslamî hate nîşandan. Sehabî ji bo hedîseke tenê hîn bibe, wergire, tam heyvekê birêveçû û vegerîya. Êdî wî rawîyê ku hespê xwe xapandibe, hedîsa wî nedihat wergirtin û qebûlkirin.

Sihabîyan çi ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] standibû? Wan ev ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wergirtibû:

a. **Înîkas** [Eks bûn, tê xuyabûn, halê wan bû wekî halê pêğemberê Xuda]

b. **Tehsîla Eqrebîyetê** [Nêzîkbûna ji Xuda û di dilê xwe de naskirina wî]

176. “Hekle tu nebûne, heke tu nebûne [min kaînat nediaferand]” Ji bo hedîsa ku meneya vê heqîqetê din av xwe de digre, li Hakim, II, 672/4228’an binêrin.

Di bin siha van herdu rewşan de di jîyana wan de xêr û heqî bi her sipehîtîya xwe ve; şer û batil jî bi her mekrohîya xwe ve eşkere û zelal bû.

Di eshabê kîram de têgihiştineke nû di bara Xuda, kaînat û nefsê de hate meydanê. Eynî wekî xuyabûna taverojê di eynekeke biçûk de, hevhalbûna bi halê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo wan bû ğaye.

Tixûbên dewleta îslamê ya bajêr ku li Medînê hatibû damezirandin û kêm-zêde ji çar sed malbatan pêkhatibû, di zemanekî wekî deh salan kurt de giha Filistîn û Îraqê. Di wê dema mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wefatkirî de dewleta îslamê bi Bîzans û Îranê re di rewşa herbê de bû. Lêbelê rewş û halê sehabîyan yê berîya deh salan, helwesta wan, awayê jîyana wan, asta refaha wan û hendese û endazyarîya xanîyên wan neguherîbû. Wan li ser jîyaneke mûtewazî berdewam kir. Xerckirina bi zêdegavî, goşt-xwerî, luks û riyakarî terzekî heyatê bû ku civaka sehabîyan ew nas nedikir. Ew tim û daîm di vê îdrakê de bûn; “sibe dê xanîyê vê nefsê qebr be”. Ew ji ber vê sedemê tim û daîm ji îsrafê îmtîna bûn; nîmetên dinyayê ji nefsa xwe re texsîs nekirin û ji heddê xwe zêde ew xerc nekirin. Wan bi heyecan û lezzeta îmanê ev nîmetên ha ji bo hîdayet û seadeta însanîyetê wek navgîn û wasîte bikaranîn. Wan di qezenckirina îstîqameta rizamendîya Xuda de şekl û awa da jîyana xwe.

Çawa ku yek ji sedemên serekeyî ji bo belavbûna Îslamê bi vê lezê û belavbûna vê ronahîyê her wekî sipêde û fecrê di navbera civakên însanî yên mezlûm, perçiqandî û xwîna wan hatî mêhtin de, temsîlbûna îslamê di şexsê sehabîyan de bûye.

Lewra ew gihabin kuderê, di kesayetîya xwe de nasnameyeke mûkemmela îslamê ji mirovan re şanî dabûn. Lewra ew sehabîyên ku telebe û xwendekarên xas ê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bûn, ew mûmînên mustesna bûn, însandost, durust, dadmend, dilzengîn, ji nûra rîsaletê tije bûn, bi nêrîna Heq Teela bi şefqet û merhemetê li evdên Xuda dimeyzandin.

Wan, Xuda û pêğemberê wî di merkeza dostanîyê de bicih kiribûn. Bi vî awayî, civakeke ummî ku nizanîbû bixwîne û binivîne, di medenîyet û şehristanîyê de gihabû zirwê. Hemû dil di vê kelecana ulwî û bilind de bûn, digotin; “Xuda çawa ji me razî dibe? Resûlûllah dixwaze me çawa bibîne?

Bi wan însanan re çax û zemanan şekl û awa wergirtin. Esrê seadetê ji mirovatîyê re hate îhsan û îkramkirin.

Ew ji şerrê nefsa emmare [xirabîxwaz] ya xwe xilas bûn, bûn ku hesab ji nefsa xwe dipirsîn. Mirovên wehşî û bedewî bûne însanê wekî milyaketan.

Giringtirîn çehre û sîma di metodolojîya hiqûqê îslamê de **îmam Qerafî** [w. 684 h] gotiye:

“Heke ti mûcîzeyeke mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ya din nebûna, ew eshabê kîram ê ku wî perwerde kiribûn, ji bo îsbatkirina pêğembertîya wî têrê dikirin.”

Her yek ji eshabê kîram ji bo mûcîzeyên Qur’anê her wekî mîsal û nimûneyeke zindî bû. Ew di temsîlkirina fîraset, dîrayet û bihayên însanî de gihabûn zirwê û bûbûn lutkeya fezîleta însanîyetê.

Fonksîyonên [wezîfeyên] eql û qelb ên ku di wê serdemê de mûmîn gihandibûn kemalê, bi hevpişkî û di nav ahengeke mezin de hatin bikaranîn. Bi zindî girtina unsur û regeza evîn û kelecanê di mûmînî de tefekkur kûr bû. Însan li ser vê bîreweri û îdrakê jîyabûn; “ev cîhan dersxaneya îmtîhanê ye.” Qelb, ji herkbarî û rewanbarîya ezemet û qudreta îlahî re aşîna û çavnas bûn. Wan ji bo emrê bi’l-merûf û nehya ‘enil-mûnker heta bi Çîn û Semerqendê rêwîtî kir û neslên di piştî wan de hatin jî heta bi Endulusê rêwîtî kir. Ew civaka cahilî bûne “ji zanayên heqîqî”. Şev bûn her wekî rojan. Zivistan bûn bihar. Tefekkur bi pêşve çû. Êdî wan dest bi tefekkura kûra li ser her tiştê hawîrdora xwe kir; her wekî pêkhatina bedena însên ji dilopek avê, pêkhatina çûk ji hêkeke besît û biçûk, pêkhatina dar û meyweyên ji sîsikeke ewqas biçûçik ku mirov hema bibêje, ew nîn e, û yên wekî van... Heyat bi rizamendîya Xuda Teala ve hate girêdan. Merhemet û şefqet di îdrak û fehmkirina Heq Teala de kûr bû, giha zirwê.

Ji bo eshabê kîram bi zewqtirîn û bimanetirîn dem û gavên heyatê bûne ew zemanên ku peyama tewhîdê ji mirovan re teblîğ dikirin, digihandin. Sehabî ji wî bênesîb ê bedbext ê ku li ber sêpîyê îdamê sê deqîqe zeman jê re nas kirî re teşekkur kir û got:

“-Naxwe ji bo teblîğê sê deqîqeyên min hene.”

**Welhasil;** eshabê kîram bi Qur’anê re û ji bo Qur’anê jîyan û heyata xwe ji Qur’anê re weqf kirin. Wan xizmet û hewldaneke wisan mezin nîşan da ku ew di tarîxê de hîç nehatiye dîtin. Ew li ber azar û îşkencê, zext û kotekî û zulm û zorê rûbirû man. Lêbelê dîsa wan hîç ji nirx û qîmetên ku

bawer dikirin tewîz neda. Wan ji bo karibin ayetên ku Xuda Teala ji wan re şandibû, bijîn, dest ji mal û milkê xwe û ji cih û warê xwe berda û hicret kir. Wan zanî di vê oğirê de her tiştê xwe feda bike.

Wan her cehd û hewl da ji bo karibin wekî pêwîst ayetekê hîn bibin û wekî lazimîya wê jî bijîn. Wan di tehlûkedartirîn dema xwe de jî dest ji Qur’anê berneda. Ebbad [Xuda jê razî be] carekê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew li ber neqebekê kiribû nobedar. Piştî ew di dema nobetê de bi du, yan jî sê tîran hate birîndarkirin ji nû ve xeber da hevalê xwe Hezretê Emmar. Çi dema Emmar jê re got:

“-Çima wexta tîra yekê li te ket, te xeber neda min?” Ebbad, bersiva wî da û jê re wiha got:

“-Min sûretek [Kehf] dixwend. Min nexwest berî qedandina wî, nimêja xwe xirab bikim. Lêbelê çi dema tîr li pey hev hatin, min xwendina xwe qut kir û ez çûme rikûyê. Ez bi Xuda sûnd dixwim, heke min endîşe nekira ku dibe ez vê neqeba ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi nobet lê girtina wê ferman li min kiribû, winda bikim, minê mirina xwe li ser nîv-temam hiştina sûretî û qutkirina nimêjê, tercîh bikira..”[177]

Eshabê kîram, heyateke Qur’anwarî dijîyan û ew di xeta wê de bûn. Her ruknekî dîn, ji bo wan lezzeteke jênetêr bû. Her ayeteke ku nazil dibû, ji bo wan her wekî sifrekekê bû ku ji asîmanî were xwarê. Hemû ğeyret û hewldana wan ji bo

177. Ebûdawud, Teharet, 78/198; Ehmed, III, 344; Îbnû Hîşam, III, 219; Waqidî, I, 397

vê bû; ew Qur’anê teleqqî bikin, wergirin û wê di heyata xwe de bijîn. Yanî ji bo ew bibin nimûneyeke sipehî û zehf ciwan. Jineke sehabî di wexta nîkahê de wek sidaqa xwe ji mêrê xwe dixwest ew çi ji Qur’anê zanibe, wê li wê hîn bike û ev ji bo sidaqa xwe jî bes didît. Ev tabloyeke çi mûhteşem û bi fezîlet e ku kelecana îmana wan nîşan dide![178]

Wan sehabîyan bi şev rabûna nimêja teheccudan, di wextê seheran de edakirina wird û zikrên xwe û xwendina Qur’anê li ser nivistin û xewa di nav nivînên germ de tercîh dikirin. Heta mirovên ku di tarîtîya şevê de di ber malên wan de dibûrin wekî vine-vina mêşên hinguvîn neğmeyên zikr û xwendina Qur’anê dibihîstin. Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di zor û zehmettirîn dem û wextên wan de jî Qur’an li wan hîn dikir.

Li gorî Enes [Xuda jê razî be] vedibêje, Ebûtelhe [Xuda jê razî be] rojekê gihabû cem mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Wî dît ku wa ye, mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] şipya Qur’anê li Eshabê Suffe hîn dike. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji birçîya kevirek danîbû ser zikê xwe ji bo pê pişta xwe rast bike.[179]

Ha meşğûlîyeta wan tev fehmkirin û hînbûna kitêba Xuda, Qur’ana pîroz bû, arzû û îştiyaqa wan jî dubare dubare xwendin û guhdarîkirina li Qur’ana pîroz bû.

178. Li Buxarî, Nîkah, 6, 32, 35; Fedaîlu’l- Qur’an 21, 22; Muslim, Nîkah 76’an binêrin.
179. Ebû-nûeym, Hîlye, I, 342

Eshabê kîram pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji xwe re kiribûn nimûne, di nîhayetê de jî Medîna Mûnewwer ji hafiz û aliman tije bû.

Ha Esrê Seadetê serdemeke wiha bû.

Gelo heke temamê psîkologan, sosyologan, pedagogan, sosyal-antropologan, mûhendisên [endazyarên] civakî, fîlozofên li dinyayê û yên wekî van tev li hev kom bibin, dikarin xwe bigihînin gwîzeka civaka esrê seadetê û dişên civakeke biçûka ku wekî civaka esrê seadetê bi xesletên bilind hatibe xemilandin, bînin meydanê? Ne mûmkin e?! Heta kitêba Farabî ya bi navê “**el-Medînet’ul-Fazîle**” [Bajarê Bêhnpak] ewa ku di xeyala xwe de projeya civakeke îdeal ava kiribû jî, ew di devê bizûzê de wek xwarineke bilezzet ma...

# Terennumên Şewitî yên Mehebbeta Resûlûllah

Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] yek û tek kehnîya rehm û mehebbetê ye ku însên bibe ser deryaya hezkirina Xuda Teala. Lewra hezkirina mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hezkirina Xuda ye; îtaeta wî îtaeta Xuda ye; îsyana li hemberî wî jî îsyana li hemberî Xuda ye.

Di vê xusûsê de cenabê Heq Teala wiha ferman dike, dibêje:

"[Ya Resûlê min!] **Bibêje: Heke hûn ji Xuda hez dikin, naxwe bidin pey min, hingê Xuda jî dê ji we hez bike û ewê li gunehên we bibûre, ef û meğfîret bike… Xuda, her gunehbexş û dilovîn e**."[180]

Di kelîma tewhîdê de di piştî "لا إِلَه إِلاّ اللّه" [**La îlahe îllellah**=Ji Xuda pê ve ti îlahê bi heqîyê nîn in] de cumle û hevoka "محمد رسول الله" [Mûhemmedun Resûlûllah= Mûhemmed pêğemberê Xuda ye] tê. Her kelîma tewhîdê û her selewata şerîf sermayê nêzîkbûna ji Heq Teala û mehebbeta wî, pêktînin. Heyata seadeta dinya û axretê û hemû fitûhatên [serkeftinên] menewî bi

180. Alî Îmran, 3/31

sermayê hezkirin û mehebbeta wî tên qezenckirin. Cîhan tezahur û xuyabûna mehebbeta îlahî ye. Nûra Mûhemmedî jî cewhera rasteqîneya vê xuyabûn û tezahurê pêktîne û yek û tek rêya gihiştina Zatê Ulûhîyetê di hezkirina wî re derbas dibe.

Rûhanîyeta di îbadetê de, zerafeta di mûamelatan de, nezaketa di exlaqî de, letafeta di dilan de, melahet û nûra di çehre û sîmayan de, selaseta di zimanan de, tenikî û ziravîya di hestan de, kûrahîya di nêrîn û awiran de, wel-hasil; hemû sipehîtî û ciwanî ji mûhebbeta wî Nûrê Hebûnê çîk û çîrûskên xwe diavêje qelban û têde xuya dibe..

**Hezretê Mewlana** çi xweş dibêje:

"*Were, ey dilo! Cejna heqîqî, mirov digihîne cenabê Mûhemmed. Lewra ronahîya cîhanê, ji ronahîya cemala wê hebûna mûbarek e*."

Ji ber vê ye ku peyrewbûn û tabîbûna sîreta nimûneyî ya pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wesîle û navgîna jênegera gihiştina mehebbet û rizamendîya Heq Teala ye. Yanî mûmînek, heta di îbadet û tevgerên xwe de di îstîqameta sunneta Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de merhele û qûnağan qut neke, ew nabe "**însanê kamil**" ew însanê ku îslam perwerdekirina wî li ber xwe hedef datîne û wî însanê îdeal qebûl dike. Hem jî ewê ku li pey sîreta wî neçe, nagihîje hizûr û seadeta heqîqî ya dînî. Lewra Heq Teala modêla "**însanê kamil**" yê ku îslam wî li ber xwe hedef datîne, di şexsê mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de şanî dide. Ew ji alemê re kiriye rehm û ji mûmînan re jî kiriye kesayetîyeke nimûneyî.

Naxwe ev îtaeta ku ewqas mûhîm e, heta ku Xuda Teala di xusûsa hezkirina ji me evdên xwe de jî xistiye şert, gelo îtaeteke çawa ye?

Bêşiwar ev halê ulwî, ji dil û can bi hezkirina ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û ji alema qelbî ya wî par û hisse wergirtinê destpê dike. Lewra Rebbê me di bara tabîbûna mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de ku ew ji bo me "**uswe'yê hesene**" yê tek e, di ayeta kerîme de wiha dibêje:

**"... Pêğember çi bide we, wê wergirin! Çi li we qedeğe bike, xwe ji wê biparêzin û ji Xuda bitirsin! Lewra Xuda, ezabê wî dijwar e!"**[181]

**"Gelî yên ku îman anîne! Bi xebera Xuda bikin, bi xebera Pêğember bikin û bi gunehan karên xwe jî pûç nekin!"**[182]

**"Kî, bi xebera Xuda û pêğember bike, ewê digel wan kesan be ku Xuda nîmeta xwe li wan kiriye ku ew jî pêğember, rastdêr, şehîd û salih in, ha ew çi xweş-heval in!"**[183]

❁

Ew Qur'ana Pîroza ku Xuda Teala ew wek talîmatname û fermaneke îlahî şandiye xwarê, ji alema qelbî ya mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji ummetê re erz dike, şanî dide. Bêşiwar dema qelbê mirov rûhanîyeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li xwe bipêçe,

181. Heşr,59/7
182. Mûhemmed, 47/33
183. Nîsa, 4/69

hingê sirrên Qur'ana pîroz jî eşkere û xuya dibin. Heke em jî her wekî eshabê kîram bi çûna wê alemê bibin xwedî şeref û em karibin bigihin bextiyarîya temaşekirina tecellîyatên sipehîtahîyên îlahî û tecellîyatên emr û nehî û îlm û hikmetên ku di wan sirran de hene.

**Bi kurtasî;** heke em karibin kelamê îlahî, bi tezahur û şerhên wî yên di alema qelbî ya pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de bixwînin û fehm bikin, ew çağ, ji bo dilên me îmkan heye ku her wekî evîndarên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] yên di esrê seadetê de li dora wî bibin perperîk.. Hingê emê karibin her peyveke wî, her fermaneke wî û heta her îşareteke wî jî fehm bikin û emê bigihin meqamê îşq, wecd û teslîmîyetê; ewên ku di vê hevokê de hatine îfadekirin:

"Ya Resûlellah! Bila bavê min, dêya min û mal û canê min ji te re feda bin!"

Hebûna mûezzeza Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo beşeran kehnîya feyz û îltîcageha mûhebbetê ye. Arif zanin ku sedemê hebûna mewcûdatan hezkirina îlahî ya ji Nûra Mûhemmedî ye. Ji bo vê sedemê hemû kaînat, wekî xelatekê ye ku ji bo Nûra Hebûnê, mezinê me Hezretê Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] hatibe hedîyekirin. Hemû kaînat, ji bo şerefa Nûra Mûhemmedî û wek mezrûfa wî hatiye aferandin. Lewra ew şexsîyeteke wisan e ku Cenabê Heq Teala jê re gotiye: "**Hebîbê min**".[184]

184. Li Tirmizî, Menaqib, 1/3616; Darimî, Mûqeddîme, 8; Ehmed, VI, 241; Heysemî, IX, 29'an binêrin.

Xwezîya me bi wan mûmînan be ku dilê xwe didin Xuda û Resûlê wî û di dilê xwe de hezkirina ji wan xwedî dikin. Hem jî ew dikarin vê hezkirinê di ser hemû mehebbet û hezkirinên din re bigrin!..

Nêzbûna ji heqîqeta Mûhemmedî ji eql zêdetir, bi hezkirin, îşq û evînê mûmkin dibe.

Asîmanên Rebîulewwelê ku wî têde şeref daye vê alemê, ew ji mûmînan re wek rehm û ğufran hatine vekirin.

Li gorî melûmatên ku jêderên me didin me; yek ji şîredêyên Resûlê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî xatûna şansdar Suweybe ye. Ev xatûn, carîya Ebûleheb ê dijminê Resûlûllah bû.

Çi dema Suweybe xatûn xebera mizgînîya jidêbûna birazîyê wî da Ebûleheb, wî sirf ji esebîyeta qewmî ya xwe ev carîye azad kir.[185] Ev keyfxweşîya ku ji esebîyeta irqî û nijadî dihat meydanê jî, têrê kir ku şevên duşemê ezabê wî were sivikkirin.

Ebbas [Xuda jê razî be] van vedibêje:

Min birayê xwe Ebûleheb di piştî mirina wî de bi salekê di xew de dît. Ew di rewşeke xirab û kambax de bû. Min jê pirs kir, jê re got:

“-Mûamele, çawa bi te re hate kirin?”

Ebûleheb bersiva min wiha da, ji min re got:

185. Helebî, I, 138

"-Ji ber ku ez bi jidêbûna Mûhemmed keyfxweş bûm û min Suweybe Azad kir, rojên duşemê ezabê min piçekî tê sivikkirin. Ew roj, ji navbera telîya min a girê û telîya şehdê ji qulikekê av dertê û ez pê hînik dibim."[186]

**Îbnû Cezerî** wiha dibêje:

"Ebûleheb ê ku dijminê Pêğember bû, di roja jidêbûna Resûlê Xuda de sirf ji ber ku bi hissên xwe yên qewmî keyfxweşîya xwe nîşan dabû, di cehennemê de ezabê wî tê sivikkirin. Naxwe, ew mûmînê ku rêz û hurmetê ji bo şeva jidêbûna mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] digre û ji bo evîn û îşqa Fexrê Kaînatê dilê xwe û sifra xwe vedike, divê em wan lutf û keremên ku ewê li cem Heq Teala bigihîjin wan, bifikrin!.. Tişta ku divê were kirin, ev e; bila mirov di meha ku Resûlê Xuda têde ji dêya xwe bûye de, zehf sohbetên manewî bike. Bila mirov Feyza xwe nû bike. Ji bo mirov karibe ji rûhanîyeta meha mûbarek îstîfade bike jî bila mirov zîyafetan bide ummetê. Bila mirov her cure xêr û qencîyan jî li feqîr, ğerîb, yetîm, bêçare û bêkesan bike û dilên mehzûn şad bike. Bila mirov wan bi sedeqeyan keyfxweş bike û bila mirov Qur'anê zehf bixwîne û wê bide xwendin..."

## Mehebbeta Eshabê Kîram ji Resûlûllah

Resûlûllah xwe ewqas bi sehabîyên xwe dabû hezkirin ku ne mûmkin e, mirov karibe kûrahîya vê mehebbet û hezkirinê

186. Îbnû-kesîr, el-Bîdaye, Qahîre, 1993, II, 277; Îbnûse'd, I, 108, 125.

îzah bike. Hezkirineke wiha, bes bi mehebbet û feyza îlahî tê cih; heke na, ew mûhal e.

Eshabê kîram her wekî sûlaveke îşq û evînê bi sedaqet û durustî xwe li hawîrdora mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi hev û din ve girêdabûn û bûbûn stêrên asîmanê pêbendbûna wî. Sehabe ewqas pêbendê wî bûn ku heke ji sehabîyekî wî re bihata gotin; "Resûlûllah wiha kiribû." Sirf ji bo ew zewqa pêbendbûna wî bijîye, ew di rêya ku ew têde çûbû, diçû, gula ku wî bêhn kiribû, ew bêhn dikir û li cihê ku ew lê rawestabû, radiwestîya.

Xuyahîyên mehebbeta şewitî û evîna destanî ya ku eshabê kîram li hemberî mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hest pê dikirin, bê jimar in.

Hinek ji wan nimûneyan ev in:

Dêya me Hezreta Aîşe rû û sîmayê bi nûr ê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha vedigot:

"*Heke xelkê Misrê wesfê sipehîtîya rûyê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bihîstibûne, di bazara Yûsuf de qurûşek jî xerc nedikirin. Heke wan jinên ku lewme li Zuleyxa dikir, enîya Resûlê Ekrem ya ku wekî nûrê diberiqand, dîtibûne, wan di şûna destê xwe de qelbên xwe jêdikir.*"

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wekî ku di kelîma şehadetê de jî hatiye îfadekirin; helbet ew wek beşer û ji hêla sûretê xwe ve "**evd**" e. Lêbelê ew bi sîreta xwe jî "**şahê resûlan**" e..

Hezretê **Ezîz Mehmûd Hudayî** ev alema ziravî û sirran seyr kiriye û çi xweş gotiye:

*Eyne ye ev alem, her tişt têde bi Heq şipya ye,*

*Her daîm Xuda ji eyneya Mûhemmedî ve xuya dibe!..*

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] navenda tecellîya mehebbeta îlahî ye, wî mehebbeta mecazî ya di xuliqandin û fitretê însên de tekamul û ulwî kiriye. Bêşiwar dema mûmîn li hemberî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hest bi cezb û lerzeyên îlahî û hissên xwe yên ciwan bike û dema ew rûhê xwe ji xîşk û xuyahîyên nefsanîyeta xwe xalî û vala bike, hingê ew ketiye ser rê ji bo bi wî re hev-eynî bibe û ji mehebbeta wî para xwe wergire..

**Hezretê Mewlana** ferman dike, dibêje:

"Du dinya ji bo dilekî hatine aferandin! Îfade û maneya *"Heke ne ji te bûya, heke ne ji te bûya, min kaînat nediaferand!.."* bifikre!"

Ji ber vê mehebbeta Resûlûllah, tesîrkereke mezin û bilind e ku însên li herdu cîhanan ezîz dike. Çawa ku eshabê kîram bi wesîleya vê mehebbetê, yanî piştî ew bi evîna mezinê me Fexrê Kaînatê hatin strandin, ew gihane wan dereceyên bilind ku ti kes nikare ji wan nêzîk bibe.

Menzere û dîmeneke din ji vê mehebbeta bênimûne ya eshabê kîram jî wiha ye:

Di dema hicretê de wexta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ber bi Şikefta Sewrê ve diçû, Hezretê Ebûbekr geh li pêşîya mezinê me Fexrê Kaînatê birêve diçû,

geh jî li pişt wî birêve diçû. Çi dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji vê bizava Ebûbekr agahdar bû, jê pirs kir, got:

“-*Ya Ebûbekr! Tu çima wiha dikî?*”

Ebûbekr [Xuda jê razî be] jê re got:

“-Ya Resûlellah! Ez difikrim ku mûşrik ji pişt we ve werin bigihîjin we, ji lewma ez li pişt we birêve diçim. Dema tê bîra min ku dibe ew li pêşîya me ketibin kemînê jî, di cih de ez diçim pêşîyê!”

Di dawîyê de ew gihan Şikefta Sewrê.

Hezretê Siddîqê Ekber [Mezintir] got:

“-Ya Resûlellah! Tu li vir bisekine, heta ez şikeftê paqij bikim, paşê were hundur!” ew çû hundurê şikeftê, wî nava şikeftê paqij kir, wî bi destê xwe ew seh û kontrol dikir. Dema qulek jî didît, perçekek ji cilên xwe diqetand û ew qul pê digirt. Bi vê terzê wî qutikê [gomlek] xwe tev xist wan qulan, lê quleke tenê ma. Piştî wî pehnîya xwe jî xiste wê qulê, got;

“-Ya Resûlellah, kerem bike, vêga were hundur!”

Çi dema bû sibeh haya pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê çêbû, bi heyret ev pirs jê kir, jê re got:

“-*Ya Ebûbekr! Ka qutikê te li kuderê ye?*”

Ebûbekr [Xuda jê razî be] tişta ku êvarê kiribû, jê re vegot. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî li

hemberî vê bizava alîcenaba Ebûbekrê siddîq [Xuda jê razî be] hestgerm bû, destê xwe rakir jorê û ji Ebûbekr re dûa kir.[187]

Li rexê din, çi sipehî û bi îbret e qisseya Sumeyra keça Qeys! Ewa ku hezkirina wê ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dide xuyakirin; ewa ku di Herba Uhudê de du kurên xwe, bavê xwe, birayê xwe û mêrê xwe winda kiribû û ew tam xwediya pênc şehîdan bû:

Roja Uhudê Medîne bi xebereke ğemnak hejîyabû. Çi dema hate gotin: "Mûhemmed hate kuştin!" li bajêr dengên qîran tevlîhev bûbûn û dengê hawar, feryad û fîğanan çûbû ber Erşê Xuda. Her kes derketibû ser rê û hewl dida ji mirovên ku tên xeberekê wergire, hîn bibe. Ji ensarîyan ji Sumeyra xatûnê re hate gotin; du kurên te, bavê te, mêrê te û birayê te hatine kuştin! Ew jina mûbarek hîç bi ber van nakeve, ew wê pirsa xwe ya ku dilê wê ji berê dikir kutekut, sûal kir. Yanî wê her halê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pirs kir, got:

"-Ma tiştek ji wî bûye?"

Eshabê kîram bersiva wê didan, digotin;

"-Hemd ji Xuda re be, rewşa wî baş e. Her wekî ku tu arzû dikî, ew sağ e, li heyatê ye!"

Sumeyra xanim ji wan re got;

"-Heta ez wî nebînim, dilê min rehet nabe, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] şanî min bidin."

187. Li Îbnû-kesîr, el-Bîdaye, III, 222-223; 'Elî el-Qarî, Mîrqat, Beyrût 1992, X, 381-382/6034; Ebû Nûeym, Hîlye, I, 33 binêrin.

Dema eshabê kîram ew şanî wê dan, derhal ew çû bi dawa cilên wî girt û got:

“Wey dê-bavên min herdu bi qurbana te bin, ya Resûlellah! Piştî ku tu sağ bî, yên din ğem nakin!”[188]

**Enes kurê Malik** [Xuda jê razî be] vedibêje:

Zilamek hate cem mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], jê re got:

“-Ya Resûlellah! Kengê qiyamet e?”

Çi dema mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê pirts kir, jê re got:

“-*Te, ji bo qiyametê çi hazir kiriye?*”

Wî wiha bersiva wî da, jê re got:

“Hezkirina Xuda û Resûlê wî..”

Vêca mezinê me Resûlê Ekrem [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

“*Naxwe te, ji kî hez kiribe, tu dê bi wî re bî.*”

Enes [Xuda jê razî be] di berdewamîya vê rîwayetê de wiha dibêje:

“Piştî em ketibûn Îslamê tişteke din bi qasî vê gotina Nebîyê Xuda: *“Naxwe te ji kî hez kiribe, tu dê bi wî re bî”* em keyfxweş nekiribûn. Ha ez jî ji Xuda, ji Resûlê wî, ji Ebûbekr

188. Waqidî, I, 292; Heysemî, VI, 115

û ji Ûmer hez dikim û ez dixwazim bi wan re bibim çendan min emelê wan nekiribe jî."[189]

Bêşiwar her mûmîn, divê dilê xwe bi nûra eşq, evîn, şewq û mehebbeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tezyîn bike, bixemilîne, ji bo bi ber vê beyana mizgîndara pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bikeve.

Dema mezinê me Resûlê Ekrem [dirûd û silavên Xuda lê bin] wefat kir, rewşa sehabîyan wekî rewşa mûmekî bû, çawa agir pêdikeve û ew dihele, ew jî ji ber şîn û huzna xwe wilo dihelîyan. Ew roj, bi fîraqa Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] dil ji nişka ve bi şewata hesretê peritîbûn û eshabê kîram ji halekî ketibûn halekî din, ew ji 'eyarekî ketibûn 'eyarekî dîtir. Hezretê Ûmer [Xuda jê razî be] jî ji nişka ve ji xwe çûbû, heta Hezretê Ebûbekr [Xuda jê razî be] însan teskîn kiribûn, hedana wan anîbû jî wî zehmetî kişandibû. Lewra ew dilên evîndarên ku nikarîbûn bê dîtina wî rojeke tenê jî tehemmul bikin, êdî wan dê li vê dinyaya fanî ew hîç nedîta. Ha Ebdûllah kurê Zeyd [Xuda jê razî be] ewê ku nikarîbû xwe li ber agirê vê hicranê bigre, wî destên xwe bi dilekî mehzûn û ğemgîn bi ber dergehê îlahî ve rakiribû, vekiribû û wiha gotibû:

*"Ya Rebbî! Êdî tu çavên min kor bike! Êdî di piştî pêğemberê min ê ku min ji her tiştî bêhtir jê hez dikir de, bila çavên min tiştekî dîtir nebînin!..*" Bi van hêstirên wî yên semîmî çavên wî li wir derhal kor bûn.[190]

189. Muslim, Birr, 163
190. Qurtûbî, el-Camî, Beyrût 1985, V, 271.

Dema Ebûbekr, di piştî wefata mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de dikir ku hedîseke wî veguhêze, vebêje, pêşî wî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dianî bîra xwe û li serê digrî, ew kelegirî dibû û êdî nedikarî biaxive.

Ebûhûreyre vê rewşa wî wiha vedibêje:

"Ebûbekr [Xuda jê razî be] derket ser mînberê û wiha got:

"-Hûn dizanin ku sala par Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] li navbera we wekî ku ez vêga rawestiyame, rawestabû.." Piştre jî girî. Paşê wî dîsa ev gotina xwe dubare kir û dîsa girî. Cara sisêyan jî wî ew gotina xwe sêcarî kir û hew xwe girt, careke dîtir jî dîsa girî."[191]

Digel ku Ebûbekr [Xuda jê razî be] tim û daîm li cem mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dibû jî dîsa ew bi hesreta wî ma û jê têr nebû. Di piştî wefata pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de bi sedem vê fîraqê, îştiyaq û bêrîkirina gihiştina wî, jê re hê dijwartir bûbû.

Dêya me Hezretê Aîşe, di dema wefata bavê xwe de ew kelecana wuslata ku wî ji bo gihiştina pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] his dikir wiha îfade dike:

"Bavê min Ebûbekr di êşa mirina xwe de wiha pirs kir, got:

"-Îro, kîjan roj e?"

191. Li Tirmizî, Deawat, 105/3558; Ehmed, I, 3 binêrin

Me jê re got:

“-Duşem e.”

Wî got:

“-Heke ez îşev bimrim, min heta sibê nesekinînin! Lewra ji bo min, şev û roja ku ez zehf jê hez dikim, ew şev û roj e ku ez têde ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nêzîk bim. [Yanî ew dem e ku gavek berî gavekê zûtir ez bigihim cenabê wî.]”[192]

Hinek ji eshabê kîram bi sedem îşq û evîna xwe ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi ğibte li nexweşên di êşa dawiyê de dimeyzandin û xwezîya xwe bi wan dianîn. Lewra gihiştina ji Xuda û Resûlê wî nêzîk bûbû. Eshabê kîram bi wan bêvîran [nexweşên li ber mirinê] re silavên xwe ji sultanê dilan mezinê me re dişandin. Mesela Mûhemmed kurê Munkedir di nexweşîya dawîya wî de çûbû serdana evîndarê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] Hezretê Cabir. Çi dema fehm kiribû ku mirina wî nêzîk bûye. Ji bo ew dilê Cabir ê ku bi hesreta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] mûzderîb û êşdar bû, tesellî bike, jê re gotibû:

“-Ya Cabir, silavên me ji mezinê me re bibe!”[193]

Eshabê kîram evîndar û aşiqê Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] bûn, wan ji vegotina bîranên di bara Hezretê

192. Ehmed, I, 8
193. Îbnûmace, Cenaîz, 4

pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de zewq distand.

Bera [Xuda jê razî be], arzûya bavê xwe ya ku di her firsendê de dixwest li bîranîneke pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] guhdarî bike, wiha îfade dikir:

“Ebûbekrê siddîq [Xuda jê razî be] bi sêzdeh dirheman kurtanek ji bavê min kirrî û jê re got:

“-Ji Bera re bibêje, bila wî bibe mala me.”

Bavê min jê re got:

“-Na! Heta tu ji me re nebêjî ka te û Resûlûllah çawa ji Mekkê hicret kir û çûne Medîne û mûşrik jî çawa li pey we dihatin, hûn teqîb dikirin, çênabe.”

Vêca Ebûbekr [Xuda jê razî be] rêwîtîya hicreta xwe wiha vegot:

“-Em ji şikeftê derketin û ketin ser rê. Em wê şevê û roja piştî wê jî meşîn. Dema bû nîvro min çavê xwe li hawîrdorê digerand ji bo ez sihekî bibînim. Min meyzand ku li nêzîkî me zinarek dixuyê û piçek siha wî jî hebû. Derhal min ew cihê sih li serê rast kir û min ew der ji bo pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] raxist û min jê re got:

“-Kerem bike, were, ya Resûlellah! Hinekê îstîrahet bike!”

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xwe da îstîrahetê. Paşê min li hawîrdoran dimeyzand ka ti kes tê û diçe. Ji nişka ve çavê min bi şivanekî mêşinan ket, wî mêşinên xwe bi ber zinarî ve diajotin. Ew jî wekî min li sihê digeriya.

Min jê pirs kir;

“- Tu şivanê kê yî?” Wî navê mirovekî Qureyşî got, min ew nas dikir.

Min jê re got:

“-Ma di mêşinan de şîr heye?” Wî ji min re got:

“-Belê, şîr di wan de heye.”

Min jê re got:

“-Baş e, tu dikarî ji bo me şîr ji wan bidoşî? [194] Wî jî got: “Belê, li ser seran û li ser çavan!”

Vêca wî mêşinek ji nav kerîyê pez girt.

Min ji şivan re got; guhanê mêşinê û destên xwe baş paqij û temîz bike. Wî jî destê xwe li hev dan û ew wilo temîz kirin. Wî tebabek şîr ji mêşinê doht û da min. Min ji bo pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi xwe re meterkek dibir û min devê wî jî bi kincekî girtibû. Min ji wî meterî hinek av bi

194. Li gorî urf û adetê Ereban; ji bo rêwîyan şîrê hemû heywanan mûbah dihat qebûlkirin. Wan tenbîha vê li şivanên xwe dikirin û ev li ser şivanên xwe yên ku nû digirtin jî şert dikirin: Kîjan rêwî were cem te, wî ji vexwarina şîr men neke. Di îslamê de bi urfê hukm-kirin xusûseke meqbûl e. [Suheylî, Rewd’ul- Unuf, Beyrût 1978, II, 152]
Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wiha dibêje: *“Sê sinif însan hene, Xuda Teala roja qiyametê [bi axaftina rehm lê kirinê] bi wan re naaxive. Ew jî ev kes in: Ew kesê ku ava zêde ya li cem xwe ji rêwîyan men dike. Ew kesê ku di piştî esrê de bi derew sûnd dixwe ji bo pê malê xwe bifiroşe. Û ew kesê ku bi xelîfe re bey‘etê dike; vêca heke xelîfe mal û tiştan bidiyê ew li ser soza xwe dimîne; lêbelê heke xelîfe mal û tiştan nediyê ew li ser soza xwe namîne.”* [Ebûdawud, Buyû‘û, 60/3474]

ser şîr de rijand, vêca binê şîr sar bû. Paşê min ev şîr bi xwe re bire cem mezinê me Fexrê Kaînatê. Ew jî ji xewê şîyar bûbû. Min ew şîr jê re pêşkêş kir û jê re got:

"-Kerem bike, vexwe, ya Resûlellah!"

*Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew şîr vexwar, ez jî bi vî awayî piçekî rehet bûm..."*[195]

Di dilê sehabîyan de ewqas hurmet û mehebbeta mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hebû. Heta hinek ji wan ji bo destê mûbarek ê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] gihabû pora serê wan, pora xwe kur nekiribûn.[196]

Ev hadîse, çi tezahur û xuyabûneke sipehî ye, nîşan dide ka jinên sehabî çawa hezkirina ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li zarokên xwe didan hînkirin:

Jinên sehabî, dema zarokên wan mideteke dirêj neçûbûne dîtina pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û ew zîyaret nekiribûne, lewme li wan dikirin û li erza wan didan. Huzeyfe [Xuda jê razî be] ji ber ku çend rojan mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nedîtibû, dêya wî lewme lê kiribû û erza wî şikandibû. Ew vê bûyerê wiha vedibêje:

"Dêya min ji min pirs kir:

"-Cara dawîtirîn te çi wextê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dîtibû?"

195. Buxarî, Eshabu'n-Nebî, 2; Ehmed, I, 2
196. Ebûdawud, Selat, 28/501

Min jê re got:

“-Min ji berî çend rojan ve ew nedîtiye.” Ew zehf ji min hêrs bû, li erza min da.

Min jî jê re got:

“Bisekine, neğeyide! Ezê derhal herim cem mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], ezê pê re nimêja meğribê bikim û ezê jê bixwazim; bila ew hem ji bo min, hem jî ji bo te îstiğfarê bike..”[197]

Halê bilbilê mizgefta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û sermûezzinê wî Hezretê Bîlal ji yê tevan cudatir bû. Dema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] terka dinyaya fanî kir û wefat kir, Hezretê Bîlal jî bû her wekî ku wî zimanê xwe daqurpandibe. Êdî ew bû ku kêran jî nikarîbû devê wî veke û lêvên wî ji ser hev ranedibûn. Ew nehîta [gir û mezina] Medînê jî jê re teng hat.

Xelîfe Hezretê Ebûbekr [Xuda jê razî be] bi arzûya ku bîranîna ezîza banga serdema pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] taze bike, bi caran li ber Bîlal gerîya ji bo bang bide. Lêbelê ew Bîlal ê derdmend û evîndarê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî bi vê gotinê lêborîna xwe jê dixwest:

“-Ya Ebûbekr! Heke tu arzûya min dipirsî, di piştî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de taqeta min ji bo bangdanê nemaye. Zorê li min neke. Ji kerema xwe min û halê min ji hev re bihêle.”

197. Tirmizî, Menaqib, 30/3781; Ehmed, V, 391-392

Hezretê Ebûbekr [Xuda jê razî be] jî bi hesreta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] her bi israr banga wan demên xweş û xweşik ji Bîlal dixwest û digot:

“-Ma ummet, di piştî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de bila ji mûezzinê wî jî mehrûm bibe?”

Bîlal, heke çi qeder xwe li hemberî israran negirtibe, di dawîyê de ew bi dilekî bi kul û bi çavên bi hêstir derketibe ser mînarê jî lêbelê ji ber zindîbûna bîranîna wan rojên seadetê di çavên wî de qulpik di qirika wî de man, wî kir îske-îsk û wî nekarî bang bide û ew bi şûn de vegerîya.. Vêca Ebûbekr jî zêde lê israr nekir.

Bîlal [Xuda jê razî be] nikarîbû hê zêdetir li Medîna ku ji bîranînên ezîz ê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tije bû, bimîne. Di piştî nimêja sibehê ya wê rojê de derhal derket ser rê û ji Medînê bar kir, çû Şamê. Ew bi hesreta ku demeke zûtir bigihîje pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li serhedan li pey şehadetê digerîya û bi vê nîyetê di mûharebe û cengan de beşdar dibû. Lêbelê bi teqdîra îlahî ew di her carê de dibû şervan, dibû ğazî. Bi vê terzê sal û zeman derbas bûn. Heta ew êşa kulê ya ku Şam dabû ber xwe û bîst û pênc hezar ğazî bi xwe re ji heyatê biribûn jî dîsa bi hikmeta Xuda Hezretê Bîlal ji wê sağ mabû. Lêbelê dilê wî bi şewata vê fîraqê temen û emrê wî peritî û helîya.

Wî, rojekê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di xewna xwe de dîtibû. Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bi gazind jê re gotibû:

"-Ya Bîlal, ev cudabûn çi ye! Ma hê jî wext nehatiye ku tu werî serdana min?" Vêca Bîlal bi ğemgînî şîyarbû û derhal derkete rê. Ew ji bo serdana qebra şerîfa mezinê aleman hate Medînê. Dema ew di hizûra mezinê me de digrî û rûyê xwe û çavên xwe bi qebra wî dihekandin, Hezretê Hesen û Huseyn derketin û hatin. Dema Hezretê Bîlal ew herdu reyhanên cennetê, yên ku mezinê me ew dabûn ber pêsîra xwe û hemêz kiribûn, herdu nevîyên wî yên hezkirî dîtin, ji xwe çû. Wî derhal ew herdu dan ber singa xwe, hemêz kirin û ew maç kirin. Wan jî bi israr jê re got:

"-Ya Bîlal! Em zehf dixwazin li ezana te guhdarî bikin!" Wî jî li ser israra wan rabû bang da. Di wê demê de Medîne hejîya. Dema wî got; "eşhedu enne Mûhemmeder-Resûlûllah", çi jin çi mêr hemû mirovan zen kir ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] sağ bû û ew ketin ser rêya Mizgefta Nebewî. Di piştî wefata mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de li Medînê rojeke din nehatibû dîtin ku însan evqas girîbin.[198]

Ev sehabîyê mûbarek, ev evîndarê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di şêst û çend salîya xwe de li Dîmeşqê wefat kir.

Wî di dema wefata xwe de ji keyfxweşîya xwe digot:

"-Sibê, Xuda hez bike, ezê bigihîjim dostên xwe yê hezkirî; mezinê me Hezretê Mûhemmed û hevalên wî."

Li aliyekî jina wî digrî û digot;

---

198. Îbnû-kesîr, Usdu'l-Ğabe, I, 244-245; Zehebî,, Sîyeru Alemi'n-Nubeha, Beyrût 1986-1988, I, 357-358.

"- Wey xwelî li serê min be!" li alîyê din jî Bîlal dilê wî ji hesreta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tije bûbû û wî bi keyfxweşî digot:

"-Ax çi xweş e, çi sipehî ye!"[199]

Em vê hezkirina bi coş û xuroşa eshabê kîram bi eşkerehî di rîwayetkirina hedîsên şerîf de jî dibînin. Dema eshabê kîram hedîsek ji mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] rîwayet dikir, bi endîşeya ku dibe ew şaş bibêjin çokên wan dilerizîn û madê wan zer dibû. Mesela dema Ebdûllah kurê Mesûd digot; qale Resûlûllah/ Resûlûllah ferman kir, got" ew bi awayekî dehşet dire'erî. Gellek sehabîyan hemû zefîyetên xwe yên beşerî li ber çavan digirtin, dema wan gotinek li pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] vedigerand, wan bi lefz û peyvên wekî van "wiha, yan wekî vê, bi awayekî nêzîkî vê got.." îfade dikir.[200]

Lewra ew, pêğemberekî ewqas mezin bû ku qurmê darxurmeya ku li serê xutbe dixwend, bi hicrana wî dihelîya û digrî. Ji bo ummeta wî ya tî, ji navbera telîyên wî çavîyên mûcîzewî yên avê herikîbûn. Nexweşên ku ji firağa ava desmêja wî bi mêhtin vexwaribûn, şîfa bûn. Mirovên ku çûbûn ser sifra wî dengê tesbîhên luqmên xwarinê bihîstibûn.[201]

Mûyên mûbarek ên por û riha wî yên ku wek bîranîn jê man, bi sed salan di mînberên mizgeftan de hatine parastin û bi navê "**riha şerîf**" ji ummetê re bûne rehm.

199. Zehebî, Sîyer, I, 359
200. Îbnmace, Mûqeddîme, 3
201. Ji bo vê mûcîzê û yên wekî wê li Buxarî, Menaqib, 25'an binêrin.

Di qiyametê de îmamê mehşerê Ew e;

Şefaetkarê gunehkaran Ew e;

Bi dilêşî ji bo ummeta xwe gotî “ummetî ummetî” Ew e;

Lîwaul hemd [alaya hemdê] di destê Wî de ye...

Hemû pêğember di ber sîbera Wî de ne..

Destê ku dergehê cennetê vedike jî dîsa destê Wî ye...

**Şêx Ğalib** vê menzerê çi xweş terennum dike:

Xutbeya te li ser mînberên alema Beqayê tên xwendin,

Hukmê te tê girtin û qebûlkirin di mehkema roja ceza de,

Gulbanga qudûma[202] te tê kişandin di Erşê Xuda de,

Navên şerîfên te li erd û asîmanan tên bibîranîn,

Mezinê min, tu Ehmed, Mehmûd û Mûhemmed î.

Mezinê me tu ji bo me sultanê mûeyyed î.

## Sûlava Mehebbetê Di Piştî Eshabê Kîram De

Ev karwanê evîn û hezkirina ji mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], yê ku ji hemû aleman re rehmeke wisan bû ku hemû didan ber xwe, di piştî sehabîyan de jî bi eynî tazetî û coş û xuroşîya xwe berdewam

202. Gulbanga Qudûmê; 1. Ew beyta merasiman yan jî dûaya ku bi awayekî bi kom bi mûsîqa dînî re tê gotin. 2. Teşrîfkirina te, bi merasimê pêşwazî lê tê kirin û ew îfade ne ku ji bo mezinkirina mirovê ku teşrîf kiriye hatiye gotin.

kir û wek kehnîya wusletê bi ser deryayê de her berdewam herikî.. Lewra seadet û selametîya dinya û axretê bi sermayê hezkirina wî mûmkin e..

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîsên xwe de wiha eşkere dike ku evîndarên wî dê heta qiyametê her berdewam hebin.

Ew wiha dibêje:

“*Hinek mirovên ku ji ummeta min zehf zêde ji min hez dikin, di nav mirovên ku di piştî min tên de derdikevin. Yek ji wan, ji bo min bibîne amade ye ku malê xwe û malbata xwe feda bike.*”[203]

*Rebbê me, me bêçareyan bixe nav mirovên ku ev hedîsa şerîf wan jî dixe ber xwe! Amîn!..*

Ev nimûneya îbretdar bi eşkerehî dide xuyakirin ku mehebbeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di evîndarên wî de ji hemû êş û janên dinyaya fanî derbas dibe.

**Ebdûllah kurê Mûbarek** vedibêje:

“Ez li dev Îmam Malik bûm. Wî hedîsên şerîfên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji me re vediguhastin. Di vê navê de ji rûyê wî elametên êş û janê xuya dibûn. Rengê wî diguherî û zer dibû. Lêbelê wî dev ji hedîsên şerîfên mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] nediberda. Dema wî ders xilas dikir û însan ji hev belav dibûn, min jê re got: “Ya Ebû Ebdûllah! Min îro di te de tiştekî ğerîb dît?”

203. Muslim, Cennet, 12; Hakim, IV, 95/6991

Wî jî ji min re got:

“Erê, di nav dersê de dûpişkek hat çend caran li ser hev bi min ve da. Lê min di tevan de jî sebr kir. Min ji ber tezîm û hurmeta xwe ya ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re karî xwe li ber bigre.” [204]

Hezretê Îmam Malik ji bo hurmetê li Medîna Mûnewwer li axa ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pêlê kirî li heywanan siwar nedibû. Pêlav nexist pêyê xwe. Dema rêwîyek dihat ji bo ji hedîsa şerîf pirsekê jê bike, wî desmêj digirt, şaşik dida serê xwe, bêhna xweş li xwe dikir, li cihekî bilind rûdinişt, paşê ew qebûl dikir. Wî xwe ji bo rûhanîyeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hazir dikir. Ji bo wî rêwî kelamê wî diguhast, neqil dikir, ji bo edebê heta tu bibêjî bes îtîna nîşan dida. Dema wî li Rewzê îmametî dikir bi dengê nizm diaxivî. Dema xelîfe yê wê serdemê Ebûcaferê Mensûr bi dengê bilind diaxivî, Îmam Malik jê re digot:

“*Ya Xelîfe! Li vî cihî dengê xwe nizm bike! Xuda Teala bi dengê bilind axaftina li meqamê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] qedeğe kiriye. Ev şîyarî û qedeğe ji bo eshabê kîram hatiye ku ew gellek ji te çêtir û qenctir bûne!..*”

Walîyê Medînê zulim û neheqî li Hezretê Îmam Malik dikir. Lêbelê dîsa wî heqê xwe lê helal kiribû û gotibû:

“*Ez şerm dikim li Mehşerê li nevîyekî Resûlûllah bibim dewedar!...*”

---

204. El-Mûnawî, Feydû’l-Qedîr, Beyrût 1994, III, 333; Suyût, Miftahu’l-Cenne, rûp. 52.

Hezretê **Seyyîd Ehmed Yesevî** ku mirovek ji mezinên ummetê ye û bi evîn û eşqê bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ve hatibû girêdan, ji ber ku pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] temenê şêst û sê salîya xwe de wefat kiribû, piştî ew gihabû şêst û sê salîya xwe ji ber îşq û hezkirina fereha xwe ku li hemberî pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hestpê dikir, wî xatir ji ger û seyaheta li ser rûyê erdê xwestibû û heta bi wefata xwe jî tam deh salan di maleke wekî qebrê de heyata xwe ya îrşadê berdewam kiribû..

Hezretê **Îmam Newewî,** alimê mezinê hedîsê ji ber ku nizanîbû ka Wî Nûra Hebûnê çawa şebeş xwariye, di temen û emrê xwe de hîç şebeş nexwariye. Dema wî ev kiriye jî, wî ew bi vê hest û arzûyê kiriye ji bo di temamê sefhe û qûnağên jîyana xwe de bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ve pêbend be. Dema wî xwestiye şebeşekî jî bixwe, ji ber ku îhtîmal hebû ew li derveyî vê terzê hereket bike, ji lewma ew ji xwarina şebeş dûr maye.

Împaratorê cîhanê **Yavûz Sultan Selîm Xan** jî, xwe bi heqîqeta Resûlûllah gihandiye û wî li dinyayê welîyek di ser hemû pîvan û endazan re dîtiye û gotiye:

*Bûna Padîşahê Cîhanê, xirecireke ziwa û rijî ye;*

*Bende-bûna ji bo welîyekî ji tevan bilindtir e!..*

Bi vê malikê, wî qîmet û hesreta nêzîkbûna xwe ji dostên Xuda û Resûlê wî anîye zimên.

Ji berê de, nivîsandina wecîze û beytekê li ser mohran adet bû. Lêbelê **Bezmê Alem Walîde Sultan** ji bo îfade bike ku Cenabê Heq Teala ev alem, ji bo hurmeta hezkirina Nûra

Mûhemmedî xuliqandiye, li ser mohra xwe ev malikên ha dabûne nivîsandin:

*Ji Mehebbetê Mûhemmed hasil bûye,*

*Ji Mehebbeta bê Mûhemmed çi hasil bûye?!*

*Ji zihûra wî Bezmê Alem bûye wasil...*

**Fuzûlî** jî, di qesîda meşhûra xwe ya avê de vê işqê wiha îfade dike, dibêje:

*“Ey çav, ji hêstirên çavê xwe avê bi ser pizotên evîna Resûlûllah yên di dilê min de nerijîne!*

*Lewra av-rijandin bi ser van pizotên ku bi agirê evînê hatine pêxistin de, ne çare ye. Ev agirê evînê, namevire!*

*Lêbelê dîsa jî çavên min ewqas ji evîna wî digrîn ku gelo ev kumbeta gerok ji vî serî heta bi wî serî tev di rengê avê de ye;*

*Yan jî ew av e ku ji çavên min diherike ku wê kumbeta asîmanî hemû xistiye navbera xwe?.. Ez nizanim, ez di halekî şaşo maşo de me.*

*Bexçevan, ji bo gulistana xwe av bide bila beyhûde zehmetîyê nekişîne!*

*Lewra ew hezar gulistanan av bide jî, ya Resûlellah, dîsa jî ti caran guleke wekî rûyê te bel nabe!..*

*Gelî dostan! Heke ez bi arzûya maçkirina destê Hezretê Pêğember bimrim, ji axa min cêrekî çêkin,*

*Bi wî, avê ji wê hezkirina bilind re îkram bikin!.. Belkû bi vî awayî, ez destê wî maç bikim û gihiştina şefaeta wî bibe nesîbê min.*

*Av bênavber di dirêjahîya emrê xwe de her digere ji bo bigihîje axa pîroza ku pêyê wî Pêğemberê rehmê lê geriyaye,*

*Av bê rawestan, eware û meczûb serê xwe li vî kevirî û wî kevirî dide, û her dikişe ji bo bigihîje toza herdu lingên mûbarekê te.*

**Suleyman Çelebî** jî dibêje:

“*Ev nûra ecêb kî ye ku taveroj perperîka wî ye!..*” Bi vî awayî ew vedibêje taveroj jî wek perperîk û perwanê li dora wî digere.

**Sultan I. Ehmed Xan** Qedema [lingê] Şerîfê mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li ser taca xwe nexş kiribû. Bi vî awayî, hewldaye feyz û bereketê ji bîranîna wî wergire û ev malikên ha nivîsandine:

*Çi dibe ku ez her tim wekî taca xwe wî li ser serê xwe bibim,*

*Ew şûnpê şûnpêya qedemê pakê*[205] *Hezretê Şahê Resûlan e…*

*Gula gulzarê nibiwwetê*[206] *xwediyê wê qedemê ye,*

*Ya Ehmed! Raneweste, rûyê xwe li lingê wê gulê bixe!..*

205. Qedemê pak; lingê tertemîz [mûbarek]
206. Gula gulzarê nibiwwetê: Gula bexçeyên pêğembertîyê.

**Hezretê Ezîz Mehmûd Hudayî** vê mehebbetê wiha tîne zimên:

*Ya Resûlellah! Qudûma[207] te rehm û zewq û sefa ye.*

*Ya Resûlellah! Xuyabûna te ji bo derdê evîndaran dewa ye.*

*Şefaetê ji **Hudayî** re bike, eger zahir, eger batin,*

*Ya Resûlellah! Gede ye, parsek e, xwe bi pêpelinga te girtiye!*

**Şair Nabî**, di rêwengîya xwe ya hecê de dema karwan giha nêzîkî Medîna Mûnewwer, padîşahekî ji ğefleta xwe lingê xwe ber bi Rewza Mûtehhere ve dirêj kiribû, ew pirr pê ğemgîn dibe. Ew di bin bandoreke zêde de van malikên jêrîn dinivîse. Ew bi van malikan, tezîma xwe ji bo Resûlûllah îfade dike:

*Eman ha terka edebê neke, ev der meqamê mehbûbê Xuda ye!*

*Ev nezergeha îlahî ye, meqamê Mûstefa ye!*

*Ey Nabî, bi şertê rîayetkirina edebê, here vî dergehî;*

*Ev tewafgeha Qudsîyan e, bûsegeha enbîyan e.*

Li hemberî vê îştiyaq û bêrîkirina semîmî ya ku ji dil dirijin û tên, bi tenbîhatên mûcîzewî yên Resûlûllah, mûezzinên Rewzê, wextê nimêja sibehê, van natan ji mînareyan dixwînin.

207. Qudûm: Hatina ji cihekî dûr, pêlê kirin û teşrîf kirin.

Ev îltîfata Resûlûllah, Nabî-yî zehf hestgerm dike; ew bi çavên bihêstir û rondik diçû Rewzê..

Hezretê **Mûhemmed Es'ed Efendî** yê ku yek ji şêxên mezinê dewrê ye, ew şewata xwe ya bi agirê bipêt ê evîna Resûlûllah çi xweşik îfade dike û dibêje:

*Ya Hebîbê min, ji tecellîya cemala te nû-behar jî bûye agir;*

*Gul bûye agir, bilbil bûye agir, sunbul bûye agir, ax û strî bûne agir!*

*Tîrêja mehtava te ye, ya ku hemû evîndar şewitandine;*

*Ziman bûye agir, sing bûye agir, hem herdu çavên hêstirbar jî bûne agir!*

*Ma mûmkin e ku mirov bi evqas agir şehîdê evînê bişûyê?*

*Cesed bûye agir, kefen bûye agir, hem ava xweş-guvar jî bûye agir!*

**Yaman Dede** pêşî mirovekî xrîstîyan bû. Lêbelê çi dema ew giha tama îdraka heqîqeta Mûhemmedî, êdî ew bû mûmînekî çavbihêstir û evîndarekî şewitî yê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]. Ew şairekî dilşewat ê dewra nêzîk e. Ev malikên wî çi sipehî ne:

*Heke ez bê av bimînim, li çolên şewatok can bidim jî hest bi êş û elemê nakim,*

*Çîyayên volkanîk di pêsîra min de dişewitin, ez di ummanan de hest bi hînikbûnê nakim,*

*Heke agir û pêt ji asîmanan bibarin û ez jî wan pêtan bi mêhtin bimijim hest bi êşê nakim,*

*Bi cemala xwe min ferehnak bike, ez peritîm ya Resûlellah!*

*Çi dewlet e ku mirov bi evîna te çavê xwe miç bike û di rêya te de can bide,*

*Ma nabe nesîb sultanê m, ku di heremgeha te de can bidim*

*Dema bimevire çavên min, hêsan dibe ku di pêpelinga te de can bidim*

*Bi cemala xwe min ferehnak bike, ez peritîm ya Resûlellah!*

*Bejna min tewîya, perîşan im, dermanê vî derdî li cem te ye,*

*Lêvên min peritîn, bi bîranîna te li ber pêyê te digere,*

*Çi demê dilê te bixwaze, vî Qitmîrî teltîf bike,*

*Bi cemala xwe min ferehnak bike, ez peritîm ya Resûlellah!*

Şair **Kemal Edîb Kurkçuoğlû** kelecan û şewqa yên li alema semawî bi bilindbûna Resûlûllah ji bo Mîracê di van malikan de çi xweş îfade dike, dibêje:

*Di şeva Mîracê de asîmanî, ji ber ku sîmayê wî seyr kir,*

*Wî wek sicûda şukrê berê xwe da erdê û kete sicûdê...*

*Rûhûl Qudûs, her şev bi kelecan dikeve îhraman*

*Ji bo wek mêhvan were Herema mûhterema meqamê pîroz!*

*Ewê ku carekê wî dibîne, ew dibêje xwezî ez careke din jî wî bibînim,*

*Ew ji rûyê wî re wek heyran dibêje Ellah Ellah û ji xwe diçe...*

❁

Pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] kesayetîyeke wisan e ku mirovên ew ji xwe re kiribûn rêber û bûbûn peyrew û pêbendê wî, her yek ji wan wekî stêrên li asîmanî ji bo însanîyetê bûne şexsîyetê mûmtaz; ew gihane seadet û hizûra ebedî.. Eshabê kîram, dostên Heq Teala û salihan ji bo karibin ji wî abîdeyê Fexrê Kaînatê nêzîk bibin, wan di pîvan û endazê de fezîlet û qîmet qezenc kirine.

Gelo ji bêhnên xweş ên qelb û dilî yên wekî Ebdûllah kurê Zeyd, Bîlalê Hebeşî, Îmam Newewî, Ehmed Yesevî û yên wekî wan ji bo me çi qeder par û hisse heye?.. Di çarçeveya xuyahîyên vê mehebbeta ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de ku ew ji eshabê kîram û bi vir de her berdewam tê, divê em jî ast û sewîya hezkirina xwe ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bipîvin û em mehebbeta xwe ji wî bikişînin ka em karin wek ummeteke layiqê wî bijîn?. Her wiha divê em rûhê xwe bi awayekî manewî ji bo vejîn û şîyarbûnê fitrîm bikim..

Li vir, pîvan di rewşa wan mezinên Îslamê yên ku me behsa wan kirî de jî, helbet pîvan û endaza di şexsîyetên stêrî yên qehremanê wecdê de ye. Lêbelê ew tişta ku ew şexsîyet,

heta qiyametê di asîmanê dilê mûmînê hê tên de kirine stêr, ew semîmîbûna evîndarî, şewq û pêbendbûna wan ya ji Resûlûllah re bûye.

Em dizanin ku eşq û mehebbet, di neqebeyna du dilan de her wekî xeta cereyanê ye. Ji bo mirov bibe mûmînekî baş, divê mirov vê îstîdad û amadekarîyê bi qelbê xwe bide qezenckirin. Di roja me ya îro de buhran û qeyranên ku însanîyet wan dijîye, ji berzebûna vê îstîdad û amadekarîya qelbî tên meydanê. Ji ber vê gellek giranbiha berhewa dibin û di çerxên nefsanî de perçe perçe dibin. Çi dema herk û berê xwe dan tim û daîm dinyewî û nefsanî bibin, hingê ti kes ji bo îştaha rûh û bilindbûna wî ya giyanî rêyekê nabîne.

Ji bo însên ne mûmkin e, ew ji îşqa mecazî bilind bibe û bigihe îşqa heqîqî, çawa ku ji bo Qeysê ku xwediyê leqeba "Mecnûn" e, ne mûmkin e, ew bigihe Mewlayê xwe di rêwengîya xwe ya ku ji Leylayê destpê kiribû de; heke di rêya qezenckirina amadekarîya qelbî ji bo eşq û mehebbeta heqîqî de ne bi hîndekarîyên qelbî û terbîyekirina wî be.. Di roja me ya îro de îhtiyaca însanîyetê bi vê eşq û evînê heye. Sersedemê hemû cînayetên dînane, xirabî û tundkarîyan nebûna vê eşq û evînê ye.

Mezinbûna hezkirineke heqîqî, dema lazim bike, bi fedakarîya ku mirov di ber hezkiriyê xwe de bike û bi xeterên ku mirov di ber wî de xwe li wan dixe, tê pîvanê. Ewê ku zehf hez dike, dema îcab bike ew canê xwe jî dide û hestpê nake ku wî fedakarîyek jî pêşkêş kiriye. Ew, ewqas siriştî hereket dike, her wekî ku deynê xwe eda dike. Lêbelê ew mirovê ku evîna heqîqî nas nake û para wî di eşqê de nîn e, naxwe ew neketiye

rêya kemalê, ew hê di otorîteya nefsa xwe de dijî û ew dilê xwe jî îsraf û zîyan dike.

Hilgirtina **emanet**ê ku heta bi çîyayan jî ew qebûl nekiribû, di eslê xwe de îmtîyazeke îlahî ye, ew ji însên re hatiye pêşkêşkirin. Şertê qezenckirina vê destkeft û îmtîyazê bi meneya wê ya heqîqî jî gihiştina evîn û eşqa heqîqî ye. Lewra ev pevçûn û levdana di rûhê însên de di nav eşqa heqîqî de dihele û winda dibe. Însanê kamil, bi eks û xuyahîyên ku ji feyzên şexsîyeteke nimûneyî werdigre, rûhê xwe ji meylên heywanî xilas dike û dilê xwe dixe bexçeyekî cennetê ku ji wê derê jî ji bo dîmenên îlahî pencere têne vekirin.

Rebbê me, di Qur'ana Pîroz de dibêje; "**Min ji rûhê xwe pif kire wî**" bi vî awayî ew cewherê ulwî û bilind ê ku ji xwe daye însên, di bîra însên tîne. Heke ev cewhera bilind û mizgîn, karibe mûmînî di encama evîn û hezkirinê de bigihîne kemalê, hingê qelb destpê dike merheleyan qut dike û ber bi alema esrarên îlahî ve diçe. Bi vê, sirrên alema îlahî, ew sirrên ku ji wan re "heqîqeta tiştan, însan û kaînatê" tê gotin, derdikevin holê. Evd, dibe xuyageh ji bo tecellîyatên eqlê selîm.

Dema evd bigihîje vê gihiştin û kemalê, ew destpê dike li perdeyên ğefleta di navbera xwe û Xuda de digere û para xwe ji sirrê "**mirina berî mirinê**" werdigre. Dinya û hezkirina fanîya wê, hemû xweşikbûna wê ya demî û bi îhtîşam ji çavan dikeve û ew ji dilan derdikeve, diçe. Bi vî awayî rûh, digihîje wê lezzeta bê tarîf, ewa ku ji ber ew ji Xaliqê xwe nêzîk e, wê werdigre.

Herçî ewên ku hezkirina heqîqî tam nekiribin, naxwe wan çarçeveya heywanîyetê ya ku di însên de heye neşikandiye û wan lingên xwe neavêtiye saha melekîyetê. Qelbê mirovê ku nizanibe hez bike, wekî axa xam e. Merîfet hezkirin e. Lewra sebebê hebûnê mûhebbet e.

Rehma îlahî ya ku beşerîyetê ji sefaletê xilas dike û wê dibe seadetê, ew mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ye, ku ew wek "**uswe'yê hesene**" [nimûneya sipehî] ji bo însanîyetê hatiye pêşkêşkirin. Rêya seadeta heqîqî, hînbûna evîna heqîqî ji wî ye, fanîbûna di wî de ye û bi mehebbet şopandina rêç û şopa wî ye.

Lewra pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] reşka çavê hemû kaînatê ye, rasteqîneya wê ye û sebebê hebûna wê ye. Ew lutfeke bilinda Heq Teala ye. Ew di navbera evd û Heq Teala de rêberê wusletê ye. Dema wî bedena xwe di meqamê evdînîyê de bi halên xwe yên bilind ên ku ne mûmkin e, mirov karibe wan îfade bike û wan eşkere bike, tine û fanî kiriye, ew di evdînîya Heq Teala de ji bo me bûye nimûneyeke bilind.

**Bi kurtasî**; ew, evîn û rehmeke wisan berfereh e ku hemû alem daye ber xwe. Ew dilên evîndarên ku jê re ram [teslîm û desteber] bûne, ewê tim û daîm di vê alemê de ji hezkirina wî bişewitin û ewê hesreta wîsala bilinda wî fir bikin. Ewê di nav vê sohtinê de bi fîzar û fîğana:

"Bi cemala xwe min ferehnak bike, ez peritîm ya Resûlellah!" mûhebbeta xwe ya ku her diçe zêde dibe, erz û pêşkêş bikin.

Ha ev eşq û evîn e, ya ku Behaeddîn Neqşîbendî, Yûnus Emre û Mewlana Celaleddînê Rûmî kirine stêrên asîmanê menewîyatê. Hezretê Mewlana bi vê evînê ber bi seadeta ebedî û heqîqî ve gav avêtiye. Seadeta wî, wesîle bû ji bo gihiştina namutenahî, yanî wusleta Qadirê Mûtleq. Lewra ew sadat, ji esareta çermê fanîyê xwe xwerû û xilas bûne, ber bi bêdawîtîyê ve mesafe qut kirine û ew bi bêdawîtîyê tenê mesûd û bextewar dibûn. Ma bi yên ku dawîya wan heye, yanî bi fanîyan re seadeta heqîqî çi qeder û di çi astê de çêdibe?.. Lewra rêya seadeta ebedî, ew e ku mirov berê eşq û hezkirina xwe bide wî yê ku ji wê mehebbetê re mûsteheq û layiq be.

Çawa ku ev gotinên Hezretê Mewlana, di vê mijarê de serkehnîya seadeta wî şanî mirov didin:

"*Heta ku canê [rûhê] min hebe, ez ji bo Qur'anê bende me. Ez axa pêyê Hezretê Mûhemmed im. Heke yek, ji peyva min, ji bilî vê tişteke biçûçiktir jî biguhêze, ez hem ji wî kesî, hem jî ji peyva wî dûr im*."

Maneya bi axa pêyê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bûn û serê xwe xistina rêya wî, ev e; mirov emrekî temam bi evîndarî pêbendê wî bijîye û di her xusûsê de jî bibe şopîner û peyrewê sunneta wî.

Ji bilî vê, ji bo mirov karibe bi awayekî layiq bibe peywendê Nûra Hebûnê. Ji bo mirov karibe rûhanîyeta wî li xwe bike û xwe pê tezyîn bike, rêyeke qezenckirina wê qiwama lazim jî ev e; divê mirov rabîta qelbî ya xwe bi wî re asê bike. Divê mirov dilê xwe ji mehebbeta Resûlûllah feyzdar bike. Ev jî tehqîq dibe; dema mirov selewatên şerîf ji xwe re bike wird.

# Selewatên Şerîf

Cenabê Heq Teala di Qur'ana Pîroz de bi jîyana mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] sûnd xwariye. Wî, navê xwe yê şîrîn û bilind bi navê wî re zikr kiriye. Wî, îmananîna bi pêğembertî û nibiwweta wî ji bo mûmînbûna evdekî kiriye şert û merc. Bi bilindbûna dengan li hizûra wî razî nebûye û nexwestiye ku xelk navê şîrînê wî wekî navekî normal û jirêzê zikr bikin, bibêjin. Li ser van hemûyan jî ev zêde kiriye, daye zanîn ku Ew û melaîketên xwe zehf zêde selat û selaman li ser wî didin û ferman kiriye û gotiye; bila eynî wisan ummeta Mûhemmedî jî zehf zêde selat û selaman li ser wî bide.

Çawa ku Xuda Teala di ayeta pîroz de wiha dibêje:

"**Bêşiwar Xuda û melaîketên xwe zehf selatan li ser Pêğember didin. Gelî mûmînan! Hûn jî zehf seletan li ser wî bidin û bi teslîmîyeteke temam selamê bidin wî**."[208] Bi vî wech û terzê ku Xuda Teala ferman kirî, selat û selam-dana li ser wî Heyberê Bilind ji bo mûmînan fermaneke îlahî ye.

Ji sehabîyan Ubey kurê Ke'b [Xuda jê razî be] wiha vedibêje:

208. Ehzab, 33/56

“Dema sêyeka şevê derbas dibû, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji xew şîyar bû, rabû wiha got:

“*Gelî mirovan! Xuda zikr bikin! Xuda zikr bikin! Wê di sûra pêşî de were pifkirin; ewa ku dê erdê ji cihê wê bilerizîne. Pifkirina sûra duduyan jî li pey wê tê. Mirin dê bi hemû dijwarîyên xwe ve were. Mirin dê bi hemû dijwarîyên xwe ve were.*”

Ubey dibêje, min ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pirs kir, jê re got:

“-Ya Resûlellah! Ez gellek selewatan li ser te didim. Gelo divê ez çi qeder selewatan li ser te bidim?”

Wî ji min re got:

“-*Tu çi qeder bixwazî ew qeder selewatan li ser min bide.*”

Min jê pirs kir, jê re got:

“-Gelo çêdibe ku ez çaryeka dûayên xwe ji bo selewatan veqetînim?”

Wî ji min re got:

“-*Tu çi qederî bixwazî, ew qeder ji bo wan veqetîne. Lêbelê heke tu wan hê zêdetir bikî ew ji bo te hê çêtir e.*”

Min jê re got:

“-Naxwe ezê nîvê dûayên xwe ji bo selewatan veqetînim.”

Wî ji min re got:

"-*Tu çi qederî bixwazî, ew qeder ji bo wan veqetîne. Lêbelê heke tu wan hê zêdetir bikî ew ji bo te hê çêtir e*."

Min dîsa jê pirs kir, jê re got:

"Naxwe, ji sê paran du-par ji bo wan têrê dike?"

Wî ji min re got:

"-*Tu çi qederî bixwazî, ew qeder ji bo wan veqetîne. Lêbelê heke tu wan hê zêdetir bikî ew ji bo te hê çêtir e*."

Min jê re got:

"-Naxwe heke ez di hemû zemanê dûayan de selewatan li ser te bidim çawa dibe?"

Wî ji min re got:

"-*Heke tu wisan bikî, Xuda dê te ji hemû tengasîyan xilas bike û ewê gunehên te jî efû bike.*"[209]

Ji ber vê giringîya wan evîndarên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin], ji bo xwe selat û selaman li ser zimanê xwe dikin wird. Lewra selat û selam, di dilên mûmînan de ji bo zêdebûna mehebbet û hezkirina ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dibin wesîle. Ji bo mirov karibe bi weché layiq bibe peyrewê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û bi awayekî pêwîst ji uswe'yê hesenetîya [nimûneya sipehîtîya] wî îstîfade bike, bêşiwar ev bi fehmkirina heqîqetên Qur'an û Sunnetê mûmkin dibe. Ev jî, bes bi nêzîkbûna ji exlaqê nimûneyî yê mezinê me Hezretê

209. Tirmizî, Qîyamet, 23/2457

pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] û bi nêzîkbûna ji kûrahîyên qelbî yên wî mûmkin e.

Hîç ti fanîyek, ji bo dana wesfê eslî yê wî mûweffeq nebûye. Bi awayekî layiqê wî exlaqê bilindê wî û xulqîyeta wî nehatiye fehmkirin. Aliman, mûtefekkiran, sultanên dilan û Cebraîl jî ji bo xwe bûna di rêya wî de îzzet û bûna sail [parsek û gerhok] li ber derîyê wî jî ji bo xwe dewlet [şens û bext] zanîne.

Li rexê din dûa jî li gorê edebên îslamê, bi hemdê ji Xuda re û bi selewat-dana li ser Resûlûllah destpê dikin, dîsa bi wan jî bi dawî dibin. Lewra di bara pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] de qenaet û bawerî heye ku bi selewateke şerîf dûa û nîyazkirina ji Cenabê Heq Teala nayê redkirin û ew qebûl dibe. Naxwe xemilandina serî û paşîya dûayên me bi selat û selaman ji vê rastîyê tê. Yanî mirov bi vê fikr û hizrê, dûayên xwe dixe navbera du dûayên ku qebûlbûna wan, tê hêvîkirin.

**Hezretê Ûmer** [Xuda jê razî be] dibêje:

"*Dûa di navbera erd û asîmanî de radiweste. Heta selewat li ser Resûlûllah neyê dayîn, ew hilnagere cem Xuda*."[210]

Çawa ku mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] rojekê mirovek dît, wî di piştî nimêjê de berî hemdê ji Xuda re bike û selat û selaman li ser Resûlûllah bide, dûa kir. Vêca pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] got: "*Vî mirovî lez kir.*" Piştre jî wî ew mirov gazî cem xwe kir û jê re got:

210. Tirmizî, Witr, 21/486

"*Dema yek ji we dûa bike, pêşî bila ji Xuda Teala re hemd û sena bike, paşê bila selat û selaman li ser pêğemberê wî bide. Paştir jî ew çawa bixwaze, bila wisan ji bo xwe dûa bike.*"[211]

Îbnûebbas [Xuda jê razî be] jî hedîseke wiha rîwayet dike. Ew di dûayan de giringîya tewessula bi Resûlûllah vedibêje:

Di navbera cihûyên Xeyberê û êla Ğetefan de şerr hebû. Kengê cihûyên Xeyberê dihatin pêşberê wan, têkdişikestin. Di dawiyê de cihûyan ji xwe re bi vî awayî dûa kir û got:

"**Ya Xudayê me! Em ji te dixwazin ku tu bi xatirê wî pêğemberê ummî bikî, ewê ku te ji me re soz daye tu wî di axirzemanê de derxînî, me li hemberî wan biserxîne**.." Û di piştî vê dûayê de wan Ğetefanî têkşikandin. Lêbelê çi dema Xuda Teala mezinê me Hezretê Mûhemmed [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew pêğemberê ku di dûaya xwe de zikr kiribûn wek pêğember şand, pêğembertîya wî û kitêba ku bi xwe re anîbû jî înkar kirin.

Ji lewma Xuda Teala di bara wan de ev ayeta ha anî xwarê û wiha got:

"**Berîya hingê wan** [navê wî pêğemberî bikar dianî, bi xatirê wî] **li hemberî kafiran serkeftin dixwest. Lêbelê çi dema ew ji cem Xuda bi wê heqîya ku ew nas dikirin hate cem wan û ew Tewrata di destê wan de jî tesdîq dikir, wan ew înkar kir. Ha leneta Xuda li kafirên wiha be**."[212]

211. Tirmizî, Deewat, 64/3477
212. Beqere, 2/89 Qurtûbî, II, 27; Wahidî, rûp. 31

Em li vir dibînin, heta wan nemislimanan jî bi xatirê qîmet û hurmeta mezinê me Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] ya ku li cem Heq Teala heyî arîkarî ji Ellah Teala xwestine. Wan ji rehm û bereketa wî pêğemberê ku Xuda Teala ew wek rehm ji alemê re şandibû îstîfade kiriye.

Cenabê Heq Teala di Qur'ana Pîroz de berê axaftina xwe dide pêğemberê xwe û wiha dibêje:

"[Ey Resûlê min!] **Heta tu li navbera wan bî Xuda, nîn e ku ezabê bide wan.**."[213]

Ev beyanata îlahî jî, di bara mûşrikan de warid bûye, hatiye. Ha heta ku mûşrik bi xwe jî ji ber nêzîkbûneke xwe ya maddî ji wî bûbin xwediyê vê îmtiyazê, gelo mûmîn dê bigihin nîmetên îlahî yên çawa? Ew jî li derveyî tesewwira me ye. Ji vê jî zêdetir, wan mûmînan ne tenê îman bi wê nûra mûezzez anîye, her wiha wan nesîbê xwe ji mehebbeta Resûlûllah jî wergirtiye. Mehebbeta wî jî kakila îmanê pêktîne… Ha peyv li vir bêçare dimîne, ew têrê nake! Bi rastî dilê mûmînekî ji mehebbeta Resûlûllah bigihîje mertebeyeke çi qeder, li dinyayê hizûr û seadeta ku ewê bigihîyê û li axretê jî meqamê ku ewê bigihîyê, ewê ewqas be, ewê bi qasî wê bibe.

**Naxwe, bila em ti caran selat û selamên li ser wî ji bîr nekin! Lewra di roja ku divê em jê bitirsin de îhtiyaca me bi tewessul û şefaeta wî heye!..**

213. Enfal, 8/33

# Mezintirîn Îhtiyac: Şexsîyeta Nimûneyî

**Perwerdeya ku însanî dixe însan: Terbîyeya îlahî**

Cenabê Heq Teala, erd û asîman ji bo xizmeta însên pêşkêş kirine.[214] Wî, însan li hemberî van tiştan û li hemberî wî bi xwe jî ew neberpirs û serberedayî nehiştiye.[215] Yanî Xuda Teala, bi qanûnên îlahî rê hem daye ber însên, hem jî rê daye ber kaînatê. Bi vî awayî, wî teqdîr kiriye ku însan di vê îmtîhana şîrîn de di nav hevkêşîya azadî û berpirsîyê de bijî.

Xuda Teala di ayeta pîroz de vê heqîqetê wiha îfade dike:

"**Xuda asîman bilind kir û mîzan [hevkêşî] têde danî. Zinhar hevkêşîyê xirab nekin ha!**."[216]

Naxwe divê însan, bi ahenga îlahî ya di kaînatê de bi yek bibe. Çawa ku di vê alema kaînata fereh de berdîberdan û bênîzamîyeke biçûçiktirîn jî çênabe, divê eynî wilo di pêbendbûn û rêwîtîya însên ya ber bi Xuda de jî ti jirêketin çênebe. Arif ew kes in ku emrekî xwe yê temam karin di nav vê nîzamê de bijîn. Ew di herdu aleman de jî mirovên ji hemû mirovan bextiyartir in. Lêbelê ew kesên ku xwe bi dest lezzetên fanî û sewdayên demî yên ku tên û derbas dibin ve

214. Li Sûretê Casîye, ayeta 13'an binêrin.
215. Li Sûretê Qîyamet, ayeta 36'an binêrin.
216. Rehman, 55/7-8

berdidin û bê nîzam û aheng dijîn, ew ji sirrên hatin û çûna vê alemê bêxeber û ğafil in. Ev cure mirov, bi nîzama îlahî û hunerê Cenabê Heq Teala yê li kaînatê re bi yek nebûne û wan ahenga bilind fehm nekiriye. Pirr heyf e ku temen û emrê wan di nav ğefleteke kûr û xwe xapandinê de derbas dibe. Ewê li axretê jî xisareteke mezin bikin.

Îzahkirina vê meselê, di rastîya însên de veşartî ye. Ev heqîqeteke zelal û eşkere ye ku însan, ji bo îmtîhan û ezmûnê hatiye dinyayê û ew bi awayekî wisan hatiye xuliqandin ku hem ji bo kirina xêrê, hem jî ji bo kirina şerrê amade ye. Lewra îmtîhan, lazim dike ku mirov karibe tişta rast bike û karibe tişta çewt û şaş jî bike.

Naxwe temen û emrê însên, di alema navxweyî û derveyî de bi awayekî berdewam bi mûcadele û têkoşîna xêr û şerrê re derbas dibe. Lewra ew herdu jî dixwazin di pêkhatina însên de hukm bikin. Yanî di nava me de çi qeder hêz û qeweta xêrê hebe, ew qeder hêz û qeweta şerrê [nefsa ku terbîye nebûbe] jî heye. Di vê têkoşînê de ji bo ğalib hatina xêrê, sade melekeyên me yên wekî eql, îdrak, îz‘an û îradeyê ne kafî ne, têrê nakin. Heke ev kafî bûne, Xuda dê ew însanê pêşî yê ku xuliqandî Hezretê Adem bi pêğembertîyê destek nekiriba. Wî dê jê re negotiba; heqîqetên îlahî yên ku însanan digihînin seadeta dinya û axretê teblîğ bike. Lêbelê Xuda Teala her zeman însan bi wehî û pêğemberên xwe berê wî daye ser heq û xêrê. Wî, bi pêğemberan re kitêb şandine ji bo eql û dilên wan xurt û teqwîye bike. Bi vî awayî, wî evdên xwe ji bo terbîyeya menewî îlzam kirine.

Lewra eql, wekî kêreke du-dev e; ew terorê jî bi însên dide kirin û emelên salih jî pê dide kirin. Însan bi arîkarîya eqlê xwe dikare bigihîje sewîye û pileya bilindtirîn “**ehsenê teqwîm**” [şekl û sûretê sipehîtirîn] yanî evd bi piştevanî û desteka eql dikare bigihîje pileya balatirîn. Lêbelê bi pirranî ew dikevin “**bel hûm edell**” [ew rêşaştir in] yanî dîsa ji ber eqlê xwe, ew ji hêla îdrakê ve dikeve asteke ji ya heywanan jî nizmtir û berjêrtir. Naxwe divê eql bikeve bin dîsîplînê. Ew dîsîplîn jî terbîyeya wehîyê û îrşada pêğembera ye. Heke eql di kontrola wehîyê de be, ew însên digihîne selametîyê. Lêbelê heke eql ji rêberîya wehîyê mehrûm were hiştin, hingê ewê bibe sersebebê encam û aqîbeteke ğemnak û cansoj.

Di tarîxê de gellek zalim hebûne ku di zirweya eqlî de bûne. Lêbelê ew bi çendîn neheqî û qirkirinan [qetla-aman] rabûne û hest bi biçûçiktirîn ezabekî wijdanî jî nekirine, poşman nebûne. Lewra ew zulmên ku wan kirine li gorî wan hereket û bizavên bi eqltitîn bûne. Mesela Hûlagû, çûye Beğdayê û 400 hezar însanên mesûm di ava Diclê de xeniqandine; lêbelê hîç hest bi ezabekî wijdanî jî nekiriye. Dîsa di berî îslamê de di dewra Mekkê de bavan kezeba dêyan diperitandin û di navbera feryadên bêdeng de keç biçûkên xwe dibirin bi sağî binax dikirin. Li gorî pîvana eqlên wan, kuştina koleyekî, yan jî birîna êzingekî eynî tişt bû. Heta wan ev ji xwe re heqekî rewa û normal didît û qebûl dikir.

Di wan mirovan de jî her wekî me, eql û his hebû. Lêbelê ew her wekî diranên çerxekê bûn ku ew berepaşkî dixebite. Wan, ew çalakî û failîyetên ku ji wan dihatin hêvîkirin na, lêbelê failîyetên berevajîyê wan nîşan dida û dikir.

Ev hemû nîşan didin ku însan, heyber û mexlûqekî wisan e ku bi meyl û arzûyên xwe yên erênî û neyênî yên ku ji xuliqîyeta wî tên, îhtiyaca wî bi îrşad, perwerde û rêşanîdanê heye. Lêbelê şert e ku ev rêşanîdan jî bi xulqîyet û fitreta wî re ahengsaz be. Ev jî bi terbîya wehîyê, yanî bi teblîğ û îrşada pêğemberan mûmkin e. Di rewşa berevajî de, heke rêşanîdaneke bi xulqîyeta me re ne mûnasib bibe, hingê ev, bi temamî dibe sersedemê şer û xirabîyê.

Di pêkhatina însên de kîjan taybetmendî zal û hakim bibe, rola wê dibe tinekirina taybetmendîya dijber û ziddê xwe. Heke xêr biserkeve, ew xirabîyê bêtesîr dike. Lê heke xirabî biserkeve, hingê ew hewl dide ji bo xêrê bixeniqîne. Bi vî awayî mûcadeleya navxwe ya însên emrekî temam berdewam dike. Ha ji bo van sedeman cenabê Heq Teala her pêğember û welîyek wek rêzanên hîdayet û perwerdê ji bo însanîyetê lutf û bexş kirine. Bes ew mirovên ku li ber wan destên mûbarek ên mahir, bi feyz û bereket hatibin perwerdekirin karîne sipehîtîyên di pêkhatina xwe de bidin xuyakirin. Xusûsîyetên wan ên wekî zivistanê cemidî û qerisî her wekî biharê bûne gulistan. Ew wisan guherîne heta ew însanên nîv-wehşî yên cahilîyetê, ewên ku keç biçûkên xwe bi sağî binax dikirin, ew bi saya îrşada mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bûne giranbihatirîn şexsîyetên beşerîyetê.

Ji xwe însan, heke bi xebera îrşada pêğemberan bikin, ew dibin evdên ku Xuda Teala ji wan razî dibe û ji bo pesn û medhan dibin layiq. Heke na, ew însanên ku di têkoşîna nefs û rûh de îmtîhana îlahî winda bikin, ew dikevin sewîye û asta nizmtirînê nizman. Çawa ku heyata dinyayê jî hatiye wicûdê ji bo tesbît bibe ka însan dê ji van herdu hedefan kîjanê bicih û

tehqîq bike. Însan bi vîyan û îradeya xwe berê xwe dide yekê ji van herdu meyl û arzûyên xwe yên mûsbet, yan jî menfî yên di nava xwe de. Ev berê xwe dan jî, li gorî encama têkoşîna nefs û rûh pevre, tehqîq dibe. Lêbelê dema ev tehqîq dibe jî însan, dîsa di bin gellek tesîran de dimînin. Heke însan li nav bexçê gulan be, ew di bêhna xweş de ğerq dibe. Lêbelê heke ew li cihekî berevajî be, bêhnên ne xweş digihin wî û ji wî tên. Xuyahîyên derdora wî, bêşiwar dê li ser wî jî xuya bibin. Ha ji ber vê sedemê, îhtiyaca însên bi îrşad, terbîye û tezkîyê ji îhtiyaca hemû heyber û mexlûqatên din zehftir e.

Ji ber ku însan di zahir û batinê xwe di nav nakokîyan de dijî û pirr zehmet û dijwar e ku ew bikare ji nav wan derkeve jî, ew di vê jîyana xwe ya fanî û mirok de zirar dike û ew dikeve sefaletê. Di esl û esasê xwe de jêdera van nakokîyan di însên de ev e; têde ew fezîletên bilindtirîn ên ku wî ji Xuda Teala nêzîk dikin hene; lêbelê li kêleka wan ew rezaletên heywanî yên nizmtirîn jî hene ku ew însên ji armanca xuliqandina wî dûr dikin.

Li ser vî esasî, dinyaya derûnîya wan însanên ku terbîye nebûbe û alema dilî ya wan negihabe hizûrê, dişibihe daristanekê ku têde gellek heywan diêwirin. Li gorî mîzaca wan hema bibêje; di her yekî ji wan de rewîşt û exlaqê heywanekî veşartî ye. Hinek ji wan wekî rovî qurnas û hîlebaz in. Hinek ji wan wekî keftaran dirinde ne. Hinek ji wan wekî mîroyan ji bo komkirinê hirsdar û çikûs in. Hinek jî wekî maran jehrdar in. Hinek ji wan bi firkandin û dilxweşkirin gez dikin pêve didin. Hinek ji wan jî wekî zîloyan xwînê dimijin. Hinek ji wan jî li pêşberî te di rûyê te de dikenin; lêbelê li pişt

te jî ji bo nêçîrkirina te koncalan ji te re dikolin. Her yek ji van exlaqan di heywanên cuda cuda de dibin.

Ew însanê ku bi terbîyekeke menewî xwe ji sulte û otorîta nefsa xwe rizgar nekiribe, naxwe ew însanê ku ji bo xwe exlaqekî sağlem peyda nekiribe, ew di nav çembera xuyên sefîhên [zewqperestî] wiha de ye. Di hinek ji wan de exlaqê heywanekî zal û hakim e. Di hinek ji wan de jî exlaqê çend heywanan zal û hakim e. Ji vê jî zêdetir ji ber ku sîret û reftara wan di rûyê wan de dixuyê, hiskirina wan exlaqan ji bo ehlê exlaqan û civaknasan ne zor û zehmet e. Ji xwe hal û hereketên wan her wekî eynekekê ye ku derûn û dinyaya navxweyî ya wan dide xuyakirin û ew hîç derewan nake.

Ma ew sîstema Komunîzmê ku li ser serbirîna 20 mîlyon însan hatiye damezirandin, ne xuyabûna pêkhatina dilekî wehşî û cenewarî ye? Ma ew ehram û pîremîtên ku ji bo Firewnekî hatiye avakirin û ew bi sağî bûye ceban û goristana bi hezaran însanan di eslê xwe de ne abîdeyeke bêmerhemetî û zulmê ye? Ev ji bo gellek ğafilan, di plana eql de hê jî wek unsurên tarîxî tên dîtin ku ew ji wan re heyran-mayinê didin şîyarkirin. Lêbelê dema mirov bi çavê heq û heqîqetê dinirxîne, ma ev tabloyeke bi wehşeta wisan dernaxin holê ku keftarên xwînxwar jî şaş dihêle û kezebê wan diqetîne?

Ev hemû nîşan didin ku heke kesên xwedî exlaqê beqê li ser civakekê bibin serwer û desthilat, meydan dibe avzêm. Heke mirovên xwedî rûhên bi exlaqê mar û zîvzîveyan li ser civakekê bibin serwer û desthilat, ew milletekî bi tevahî bi jehrê dixin û di navê de teror û anarşî destpê dike. Lêbelê dema mirovên tebîet gul li ser civakekê bibin serwer û

desthilat, memleket hemû dibe gulistan; însan jî digihin hizûr û seadetê.

Ha ji bo van sedeman wehî û peyama îlahî şert e. Wehî ewqas mûhîm e ku ew mirovên ji vê terbîye û perwerdê dûr bin; heke ew tabloyên wehşî yên wiha nîşan nedin û hinek hereketên rast û sipehî nîşan bidin jî, lêbelê ew xwedî wesfê wê wehşetê ne, naxwe her wext û gavê ji bo kirina wê cenewartîyê amade ne.. Lewra her sipehîtîyên ku ji derveyî terbîya îlahî hatibin qezenckirin berwext in. Nemaze di wextên zor de û di wexta ku arzûyên nefsanî har dibin de di însanên ku ji terbîyê mehrûm bin de her texlît xamîtî û meylên xirab derdikevin meydanê.

Lewra nefsa ku terbîye nebûbe, dişibihe kitika ku ji bo girtina mişkan dilhar be. Ew kitik, dema xwarinên bi kulfet û bi qîmet ê ku dane berê dixwe jî, heke ew mişkekî bibîne, derhal wan lezzetên xweş ên li ber xwe, terk dike û xwe hildiavêje û bi pey mişk dikeve. Ha însan jî, heke bi pîvan û endazên îlahî nehatibe terbîyekirin, heke dilê wî ji bo sipehîtîyên bêjimar ram bûbe jî lêbelê kitika nefsê, bi wî dilê xwe bi pey wî mişkî dikeve û însên dibe helakê. Dema mirov li jîyana Firewn û Nemrûd binêre, mirov dibîne ku wan ji bo hewesên ku di hukmê mişkekî biçûçik de ne, her dem bi neheqî gellek qirkirin û qetla-am kirine.

Halhal e terbîya îlahî, li mirov ferman dike ku mirov li hemberî heqekî evdan yê biçûktirîn jî bibe wekî mûmekî lerzok, ji xwe tu ji kuştina bi neheqî ya însanan hîç neke behs! Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji jêkirina çiqilekî şîn jî îmtîna bûye. Dema ew çû fetha Mekkê,

ji ber ku dêlesekekê cewrikên xwe şîr didan, ew ji bo wê netirsîne, wî artêşa xwe derbasî terefê din ê rê kir. Dîsa mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] li hemberî kunmîroyeke şewitandî bizdiha û got; "*kî dikare vê kunmîroyê bişewitîne!*" Wî, bi vî awayî teessur û veciniqîna xwe îfade kir.

Ha ew Osmanî ya ku bi vî rûhî hatiye stran, bi vê hevîrtirşê merhemetê yê ku ji Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] wergirtî, wê gellek weqf damezirandine ku ew hem di xizmeta însanan de, hem jî di şefqetkirina li mexlûqatan de gihane zirweya şefqetê. Ew sihheta heywanan jî fikriye. Wê ji bo sağlemîya wan jî weqf dane avakirin. Ew xuyabûneke vê şefqetê ye ku ew bîyanî û ecnebîyên ku di wê serdemê de ji bo seyahetê hatine welatê me, di bîranîn û xatiratên xwe de dibêjin; kitik û se li taxên mislimanan li dora mirovan digerin; lêbelê wan li taxên din dema mirov didîtın ji ber wan direvîyan..

Ew tezahur û xuyahîyên vê ne; gelo însan çi qeder hatine terbîyekirin, yan jî ew çi qeder nehatine terbîyekirin. Lewra her însan bi xwe ye, ewê ku xwînê dirijîne, xwînê vedixwe û bi xwînê axê av dide. Dîsa însan bi xwe ye, ewê ku xwîna xwe ji bo mirovê mûhtac bexş dike û gulan dide destê wan.

Çi hikmeteke mezin e ku li vê alema dinyayê mirovên xwedî exlaqê hevdij yên mûsbet û menfî, erênî û neyênî bi hev re dijîn! Heke lazim be ku mirov vê bi mîsalekê îzah bike, ev hal û rewş, dişibihe wê ğezala zerîfa ku ji mecbûrî di axura heywanên serhişk û xuy-xirab de îzdîrab û cefayê tehemmul dike. Carina mirovekî nekes û mirovekî comerd; mirovekî ehmeq û mirovekî zana, mirovekî bi merhemet û mirovekî

zalim li kêleka hev dijîn. Nekes, bê merhemet e, newêrek û tirsonek e, ji xizmetkirinê dûr e. Li hemberî vî jî comerd, dilovan e, bi merhemet e, mûtewazî ye, nefsbiçûk e, ehlê xizmetkirinê ye. Ehmeq, ji zanayî fehm nake; zalim jî xwe bi edalet guman dike û daîmî li dijî mirovên hawîrdora xwe hêz û qewetê bikartîne. Yanî mirovên rûh-melek û keftar li heyata dinyayê bi hev re dijîn. Yek ji wan heqîyê nas dike, jê re dibe kole û ew di rêya dîtina heqîyê de ye. Ewê din jî jîyana di nav xuyên nizmî yên mexlûqatan de seadet guman dike ku ev jî heyatê; xwarin, vexwarin, şehwet, meqam û îhtîrasên wekî van dizane.

Di eslê xwe de jîyana li dinyayeke ku rewîşt û exlaqên hevdij di xwe de dihewîne de îmtîhaneke zehf dijwar û çetîn e. Lêbelê însan mecbûr e, ji vê îmtîhanê derbas bibe. Lewra ji îmtîhana dinyayê derbasbûn û gihiştina wusletê, armanca eslî ya însên e. Di nav vê de divê ew xwe ji sifetên xirab xilas bike û sifetên baş û xweş jî di xwe de bîne wicûdê. Yanî divê ew bi şeref û heysîyeta însanîyetê re bijî.

Însan bi rûhê xwe semawî ye, lêbelê ew bi bedena xwe tûrabî ye, ew ji axê hatiye aferandin. Naxwe rûhê wî li Xuda Teala vedigere, lêbelê bedena wî jî wê li axê vegere. Însan bi bedena xwe sifetê mexlûqatên din pê re hene. Ji lewma zerûrî ye ku ew tezkîye û terbîyekeke manewî wergire, nefsa xwe bixe bin kontrolê û rûhê xwe jî xwedî û xurt bike. Di rewşa berevajî vê de, ew ji derve nikare ji şeytanê nava xwe xilas bibe û ewê her li hemberî wî meğlûb bibe. Ew jî wê qeweta rûh wê zeîf bike.

Xuda Teala di Qur’ana Pîroz de wiha ferman dike, dibêje:

“**Ez, bi nefsê û yê ku bi awayekî mûnasibî meqseda aferandina wê awa daye wê, ficûr û teqwaya wê** [qencî û neqencîyên wê] **jê re îlham kirine, sûnd dixwim; ewê ku nefsa xwe ji** [qirêjên maddî û menewî] **paqij bike, xilas û serfiraz bûye!; ewê ku nefsa xwe di tehlûke û gunehan de noq bike jî, wî ziyan û xisar kiriye**!”[217]

Teqwa û ficûra ku di alema derûnîya însên de hene, ewa ku ev ayet wan eşkere dike, **Hezretê Mewlana** wan bi vê teşbîhê îzah dike, dibêje:

“*Ey Rêwîyê Heqîyê! Heke tu dixwazî rastîyê hîn bibî; Mûsa jî, Firewn jî nemirine; îro ew di nava te de dijîn, wan xwe di hebûna te de veşartiye, ew şerrê xwe di dilê te de didin dewamkirin! Ji ber vê sedemê, divê tu di nava xwe de li van herdu kesên ji hev re dijmin, bigerî!*”

Dîsa **Hezretê Mewlana** wiha dibêje:

“*Tu, li xwedîkirin û pêşvebirina zêde ya çerm nenêre! Lewra ew qurbanek e, ewê her di dawîyê de ji axê re were dayîn. Tu, esl li xwedîkirina dilê xwe binêre! Ev e, yê ku hilgere, here alema jorê û xwedan şeref bibe.*”

“*Tu, tiştên bi tewaş û bi hinguvîn kêm bide bedena xwe. Lewra ew kesê ku ji lazimîyê zêdetir wê xwedî bike, di dawîyê de ew dikeve arzûyên nefsanî û rezîl dibe û diçe.*”

217. Şems, 91/7-10

"*Ğizayên menewî bide rûhê xwe. Hizirîna gihayî, têgihiştina zirav û tenik û xurekên rûhî pêşkêş bike ji bo ew bi awayekî xurt û bi hêz biçe cihê ku ewê biçiyê.*"

Mîsala wê nefsa ku terbîye nebûbe, dişibihe dareke kokrizî. Elametên rizîna wê; di çiqil, pel û fêkîyên wê de xuya û zahir dibe. Heke di qelb de jî nexweşîyek hebe, ew di bizav û hereketên bedenê de derdikeve holê û zirara wê tê dîtin. Ev nexweşîya dil jî, sifetên nefsanî yên wekî kîn, hesed û kibrê ne, ku tedawîya wan zerûrî ye. Îslahkirina van sifetên menfî û neyênî jî, di serî de bi ketina ser îstîqameta wê rêya ku Xuda Teala wê arzû dike û wê nîşan dide, mûmkin dibe.

Herçî ew herdu îhtiyacên esasî ne ji bo însên, da ku ew bikare bi awayekî ku Xuda Teala jê razî dibe kesayetîya xwe ava û terbîye bike. Ew herdu îhtiyac û meyl jî "nimûne girtin" û "teqlîd kirin" e.

**Meyla Nimûne Girtin û Teqlîd-kirinê**

Însan, ji dema ew ji dêya xwe dibe û pê de di her xusûsê de îhtiyaca wî bi nimûneyekê heye. Lewra ew, fikr û raman û failîyetên ku heyata wî pêktînin hemû, her wekî ziman, dîn, sifetên exlaqî û hînbûn û xuy, bawerkirin, ew wan ji nimûneyên ku jê re hatibin şanîdan û ji çavdêrîyên ku ji wan distîne, pêktîne. Heke çi qeder hinek îstisna û der-rêz û rêç hebin jî, lêbelê ew bi xîşk û xetên xwe yên giştî wiha ye.

Mesela zarokek, dê-bavên wî bi kîjan zimanî biaxivin, ew bes wî zimanî hîn dibe. Paşê ew bi nimûneyên din dikare zimanekî duduyan, sisêyan û çaran jî fêr bibe. Yanî li gorî

nêrînekê, perwerde û hîndekarîya însên, ji teqlîdkirina tiştên erênî û neyênî pê ve ne tişteke dî ye. Ew li kêleka gellek bandoran bi rêya meyla teqlîdê di fitreta wî de cih girtiye. Di sîbera vê de însan, di bin tesîra dê-bavên xwe yên ku wî mezin û xwedî dikin de dimîne. Ew di bin bandora malbata xwe de dimîne û di dawîyê de ew di bin bandora hawîrdora xwe ya ku têde dijî de jî dimîne. Ew li gorî amadekarîya xwe ya ji bo vê teqlîdê wek şexsîyeteke erênî, yan jî neyênî beşdarî civakê dibe.

Lêbelê însan bi awayekî giştî, bi hêsanî ziman û xusûsên zahirî, yên wekî van hîn dibe. Lêbelê di pêkanîna alema wî ya manewî, exlaqî û dînî de astengên mezin û ciddî derdikevin holê. Lewra astengên wekî nefsê û şeytên, ewên ku îradeya îlahî ji bo îmtîhanê di însên de anîne holê û ew hîç terka însên nakin, ew hewl didin ji bo însên ji teqlîdkirina van cure fezîletan dûr bikin.

Însan, bi sebeb meyla teqlîdkirin û nimûne-girtina ku di fitreta wan de heye, bi awayekî erênî, yan jî neyênî ji bo mirovên ku wan ji xwe re rêzan qebûl dikin dibin meftûn û bi qasî hêza xwe li pey rêç û şopa wan diçin. Naxwe alema manewî, exlaqî û dînî, heke ew ji terefê pêğember û dostên Heq Teala ve neyên pêkanîn, hingê însan ji ketina ğeflet, delalet û îsyanê xilas nabin. Bi vî awayî seadeta ebedî ya wan, bi xusraneke hezîn û ğemnak werdigere.

Çawa ku halê wan kesên hinek mirovên meşhûrên ku di nav sefahetê sobaberî dikin ji xwe modêl digrin û ji bo gihiştina wan jî seadeta ebedî ya xwe dixin xeterê, ew îsrafeke dehşetdara însanî û îflasa medenîyetê ye. Ev rewşa dehşetdar,

di eslê xwe de bi navê tijekirina textê vala-hiştîyê dilî û pêşkêşkirina wî ji bo hinek mirovên şaş, ji zayî û zîyankirina wî pê ve ne tişteke din e.

**Hezretê Mewlana** hîleyên nefsê bi îfadeyeke nêreber û mûşexxes xulase dike û xapandina balkêş û ğerîba nefsê ji bo însên jî bi vê mîsalê îzah dike, dibêje:

"*Reva berx, ji gur ne ecêb e. Lewra gur, dijmin û nêçîrvanê berx e. Lêbelê tişta ku mirov jê re heyirî bimîne ev e ku berx dilê xwe bide gur*."

"*Gellek masî hene ku di nav avê de ji her tiştî ewle ne; lê ji ber hirsa qirika xwe ketine şewkê masîgir*."

Ji ber van sedeman tim û daîm îhtiyaca beşerîyetê, bi rêber û mûrşidên rûh-paqij û dil zerîf û tenik heye da ku ew li dijî hîlebazîyên nefsê rêya rast û durust ji wan re şanî bidin.

**Kesayetîyên Nimûneyî yên Pêğemberan**

Ji ber ku hezkirina însanekî, heyran-mayîna ji bo şexsîyet û exlaqê wî û teqlîdkirina wî meyleke fitrî ye, ji bo însan dîtina nimûneyên mûkemmel û çûna li pey rêç û şopa wan xusûseke zehf mûhîm e. Ji ber vê ye ku Cenabê Heq Teala, yê ku lutf û kerema wî bêdawî ye, ji bo însan bes ne kitêb tenê şandine; lêbelê dı eyni zemani de ji bo wan pêğember jî hinartine. Ew resûl, îfadeya zindî ya wan kitêban e û ew xwedî sifetên mezin û bilind in.

Ew şexsîyetên nimûneyî yên wisan e ku ew bi hereketên xwe yên dînî, îlmî û exlaqî ji her alîyan ve mûkemmelîyetê erz

û eşkere dikin. Çawa ku her pêğemberek di tarîxa însanîyetê de hereketên diyar ên nimûneyî yên wan bûne zirwe û xizmetên mûstesna û giranbiha ji beşerîyetê re pêşkêş kirine.

Welî, yanî dostên Heq Teala jî,

-Wan zahir û batinê dîn bi yek kiriye û ew bi awayê layiq û mûnasib di şexsîyeta xwe de nexş kiriye,

-Wan di rêya zuhd û teqwayê de merheleyên qelbî qut kiriye û ew gihane mûkemmelîyeta hereket û bizavê,

-Wan îdrak û hesta xwe ewqas fereh kiriye ku ew asoyên herdu cîhanan bide ber xwe û ew gihane lezzeta îmanê û kûrahîya hestan,

-Hemû ğeyret û hewldana wan ji bo xilaskirina însanîyetê ji xuyên xirab û rizgarkirina wê ji rêşaşiya taristanîya nefsê ye û bilindkirin û gihandina wê ji bo exlaqê xweş e, yanî rakirina wê bi ber asîmanê kamilbûna menewî ve ye. Ev welî jî, mûmînên arif, salih û kamil in.

Evên ha zirwe ne, gihane mûkemmelîyeta hereket û îrşada nebewî û ew di dirêjahîya wext û zemanan de belav bûne. Yanî ew şexsîyetên bilind in, ji bo însanên ku negihabin şerefa dîtina pêğemberan divê şexsîyeta wan welîyan ji xwe nimûne bigrin û wan bişopînin. Lewra nesîhet û îrşadên wan ku ew bi zimanê rehmê dilan sağ dikin, di esasê xwe de ew şebnem, xwîsîtî û dilopên rûhanîyetê ne, ji serkehnîya nibiwetê palîyane û hatine.

Li kudera dinyayê dibe bila bibe, heke di navbera însanan de hukmê edaleteke dewam bike û ew bi ber çavan bikeve,

heke şefqet û rehmek hebe ku qelbê mirovan bi hev û din ve girêdabe, yan jî heke di nav civakekê de zengîn bi şefqet mûamele bikin û bi arîkarîya feqîran ve bazbidin herin, heke xurt jî qels û mezlûman biparêzin, heke mirovên bisihhet û tendurust bi destê nexweş û bêçareyan bigrin, heke serwetmend jî zikê sêwî û jinebîyan têr û xwedî bikin, hingê bê tereddud û dudilî zanibin ku ev fezîlet û bêhnpakî ji pêğemberan û ji welî û qencên ku li pey rêç û şopa wan diçin, hatine guhastin û wergirtin..

Malbata însanîyetê bi Hezretê Adem û Hewwa [silavên Xuda li wan be] destpê kiriye û ji bo di wezîyet û hawîrdoreke bi seadet, hizûr û dînî de bijîn; cihê Ke‘beya ku îro li Mekkê ye ji xwe re kiribûne îbadetxaneya pêşî. Paştir bi sebeb lizûmtîya heyatî û îctîmaî zaroyên Adem li hawîrdoran belav bûn. Car caran bi pêğemberan rê ji wan re hate şanîdan û wan heyata xwe ya dînî daye dewamkirin. Car caran jî kengê heqîqetên îlahî ji terefê hinek texrîbkarên dînî û cahilan ve hatibin tehrîfkirin, Cenabê Heq Teala ji wan re pêğember û resûl şandine. Bi wan ev texrîbat berteref kirine û ji nû ve dînê rast û durust îhya û sağ kirine. Bi vî awayî alema însanîyetê, di dirêjahîya tarîxê de wek esereke lutf û kerema îlahî tim û daîm ji buhran û krîzên ferdî û îctîmaî hatiye xilaskirin û ew gihaye axirzemanê.

Di dawîyê de “Esrê Seadetê” hat ku ew dişibihe esr û berêvara roja dinyayê û heyata dînî careke din di eynî cihê ku pêşî destpê kiribû de giha zirweya kemala dawîyê. Ew zirweya kemalê jî di mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] Mûhemmed Mûstefa de temsîl bûye. Di piştî “**kemala Mûhemmedî**” de ku wê zirwe pêkanîye û di piştî

wê de êdî kemaleke din nayê tesewwirkirin û şayesandin. Ji lewma îhyakirin û nûjenkirina dînî ji rêya şandina pêğemberan gihaye dawîyê. Êdî careke din ti pêğemberekî din ji mirovan re nayê şandin. Ew dînê ku Heq Teala jê xweş û razî ye jî, dînê îslamê.

Em di vê rewşê de karin bibêjin; Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di perwerdekirin û berşanîdana mirovan de bi teqlîd û nimûneyên pratîk tekûztirîn nimûne ye ku wî di jîyana xwe de ew nimûneyên bêdawî şanî dabûn. Di rastîyê de meyla teqlîdkirina pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji fitretê ye. Lêbelê ji bo em di teqlîdkirin û li pey çûna wî de biserkevin jî divê em ji şexsîyeta wî re bibin evîndar û meftûn, divê em ji kûrahîya dilê xwe ji wî hez bikin û ji wî re tam pêbend bin.

# Gelo Em Çi Qeder Ji Wî Hez Dikin?

Cenabê Heq Teala însan mûmtaz kiriye. Ew kiriye ehsenê teqwîm, yanî şerefa heyber û mexlûqê çêtirîn daye wî. Ji bilî vê Xuda Teala eşkere kiriye; çi li erdê hebin, çi li asîmanan hebin, hemû ji bo xizmeta însên hatine amadekirin. Tabîî, ev hemû ji bo xwedî fikran e.

Naxwe mezintirîn wezîfeya me ev e; emê ajar û nîmetên Cenabê Heq Teala yên li ser xwe tefekkur bikin û emê wan, li gorî meqsûda dana wan, binirxînin. Bi taybetî jî em mûkellef û berpirs in ku dilê xwe û eqlê xwe bi awayekî rast û durust bidin şiğulandin.

Divê eql, çawa were bikaranîn?

Divê eql, ji nefsê re ram û desteber nebe; berevajîyê vê, divê ew ji heqîqetên îlahî re çavnas be û xebera wî jê hebe ku ew di nav dinyaya îmtîhanê de ye.

Divê dil, çawa were bikaranîn?

Dil, mekanê evîn û hezkirina ji cenabê Heq Teala ye. Nezergeha îlahî ye. Naxwe divê ew ji her cure masîwa û gunehan temîz were girtin û divê ew ji tewhîd û zikrê were tijekirin. Di dawîyê de jî dema mirov ji dinyayê koç bike bila karibe bi qelbekî selîm biçe hizûra Xudê Teala. Ha ji bo vê qiwam û hevkêşîyê jî.

## Nimûneya yek û tek Hezretê Pêğember

Cenabê Heq Teala, pêğember bi meqsûda şîyarkirin û rêşanîdanê ji me re şandine. Wek berhem û esera lutf û kerema bêdawîya wî, heta berî 1400 salan -li gorî rîwayetekê- 124 hezar û çend pêğember hatine dinyayê. Cenabê Heq Teala pêğemberê xwe yê ku ji tevan bêhtir jê hez dikir û ew ji tevan mûstesnatir ji bo pêğembertîya dawîn hiştiye. Wî, her pêğemberek ji bo qewmekî şandiye. Wî pêğemberî li gorî pêkhatina îctîmaî ya wî qewmî rê şanî wî daye. Wî, mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî ji bo hemû beşerîyetê şandiye. Wî, zemanê niha û zemanê heta bi qiyametê ji teblîğa wî re teslîm kir.

Xuda Teala, Mezinê me Hezretê Mûhemmed [dirûd û silavên Xuda lê bin] di zemanekî wilo de wek rêberekî hîdayetê û wek tavekê ji temamê însanîyetê re lutf kir ku kufr û cehalet di dehşetdartirîn zemanê xwe de bûn. Wî ew wek lutf û keremeke xwe ji me re îhsan û bexş kir.

## Mezintirîn Mûcîze

Cenabê Heq Teala mezintirîn mûcîze: Qur’ana Pîroz ji mezinê me Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] re bexş kir. Qur’ana Pîroz heta qiyametê, ewê her îsbat bike ku ew kelamê Xuda ye û dîsa ewê pêğembertîya Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî îsbat bike. Însanîyeta ku heta qiyametê were dinyayê, ewê vê mûcîzeya ku ji mezinê me Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin] hatiye dayîn, bibîne. Ewê ji nêzîk ve wê nas bike.

Hezretê Pêğember bi mûcîzeya Qur'anê civakeke wilo anî meydanê ku jê re "Esrê Seadetê" hatiye gotin. Li dinyayê civakeke duduyan a wekî wê nîn e. Lewra ew roj, ji însanîyeta cahilîyetê, civakeke wilo bêhnpak anî meydanê. Yanî ji wan însanên ewqas nezan û hov, civateke wilo anî meydanê, ew gihandin zirweya fezîletê û rewşa wan ewqas guherand her wekî ku ji binê okyanûsê derxistibin û rakiribin navsera çîyayê Hîmaya'yê. Civateke wehşî û hova ku keç biçûkên xwe bi sağî binax dikirin, bi perwerde, feyz û rûhanîyeta Hezretê Pêxember, ji hisên şefqet û merhemet û berpirsîyê ewqas tije û mişt bû ku êdî nikaribe destûr bide, gurek li ber kenarê Diclê berxekî zeîf û qels bigre û bixwe. Ha ev mûweffeqîyet bi tenê jî têrê dike ku ji me re şanî bide ka şexsîyeta mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] çiqas bilind û mezin e, ew şexsîyeteke çawa mûkemmel û uswe'yê hesene bû, yanî ew di her xusûsê de nimûneyeke sipehî û ciwan bû..

## Kor Çavnebarîyê Ji Tavero jê Dikin

Heke qelb ne kor be, ewê her wî bibîne. Heke çavê wî ne şaş û kwîr be, ew ti zeîftîyekê di wî de nabîne. Yanî ewên ku dixwazin kêmasî û qusûran jê re çêkin, di rastîyê de ew dikin ku eczîyet, xeta, çewtî û kêmasîyên xwe îfade bikin.

Tarîx, ji neheqî û îftîrayên dilğelên ên qewmên ku li pêğemberên xwe kirine tije ye. Lewra ew heqîqetên îlahî yên ku pêğemberan ew teblîğ kirine, ji ber ku li xweşîya arzûyên nefsanî yên hinek mirovan nediçûn, ew ji van sipehîtîyan aciz û reht dibûn. Wan jî bi mebesta ku heyata nefsanîya xwe ya ku

dijîyan wek rewşeke normal û rewa were qebûlkirin, zeîftî û mekrohîyên xwe diavêtin stûyên pêğemberan û li wan dianîn.

Naxwe îro jî ew hemû kampanyayên bêbextî û îftîrayên dilğelên ên ku li dijî mezinê me Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tên kirin, di rastîya xwe, ewên ku wan îftîra dikin exlaqên xirabên xwe û bedbextîyên xwe didin xuyakirin.

Her heyber, dikare heyata xwe di mekanekî ji tebîetê xwe re mûnasib de bide dewamkirin. Însan jî ne li derveyî vî qaîdeyî ye. Çawa ku xureka mêşa hinguvî, qada teneffusa wê û alema ku ew têde dijî çîçek in, ew nikare li derveyî wê alema ku hînî wê bûye, bijî; berevajîyê vê, ew mişkê ku mîzaca wî hînî xebîstî û qirêjê bûye, nikare li nav bexçekekî gulan biêwire û li wir bijî. Çawa ku rûhên pak û bilind xureka xwe ji fiyûzatên ku ji heqîqeta Mûhemmedî xuya dibin, werdigrin, her wiha rûhên xebîs û fasiq jî bi xebîstîyê tetmîn dibin.

Hezretê Ebûbekr [Xuda jê razî be] li çehre û sîmayê mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] dinêre û dibêje; "*zehî çi qeder sipehî ye!*" û jê re heyran dimîne. Di eslê xwe de wî di wê eynê de li alema derûnîya xwe temaşe dikir.

Çawa ku li hemberî vê îfadeya mezinê me, Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin]:

"*Bi qasî ku min ji malê Ebûbekr îstîfade kiriye, min ji malê ti kesî din ew qeder îstîfade nekiriye...*" Hezretê Ebûbekr jî hêstir ji çavên wî barîn û wiha got:

"*Ma ez û malê xwe, ne ji bo te tenê ne, ya Resûlellah?!*"[218] Bi vî awayî, wî nîşan da ku wî digel her tiştê xwe, xwe ji bo pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] xistiye qurban û wî xwe di wî de fena û tine kiriye. Lewra alema navxwe ya wî bûbû eyneyeke ku exlaqê mezinê me Resûlê Ekrem di xwe de dida xuyakirin.

Li alîyê din, Ebûcehlê dijminê sereke yê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jî di wê rûyê mûbarek de întîbayeke berevajîyê vê distand û ji sipehîtî û îhtîşama têde bêgane dima. Sersebebê vê biferqbûnê jî ev e; her yekî ji wan di eyneya Mûhemmedî de heqîqeta xwe, yanî alema navxwe ya xwe didît. Lewra pêğember wekî eyneyeke bi cîla ye; her kes têde alema navxwe ya xwe temaşe dike! Hîç eyneyek jî ji bo xatirê ti kesî derew nake, ne xweşikî, xweşik û xweşikî jî ne xweşik nîşan nade! Tişta ku xwe têde dide xuyakirin çi be, ew jî wî nîşan dide.

Di rastîyê de ewên ku hewl didin ji bo li dijî Îslamê, Qur'ana Pîroz û Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] zal û mûsellit bibin û êrîşan tînin ser wan, bêşiwar çi zû be û çi jî dereng be, ewê her li tol û întîqama îlahî rast û duçar bên.. Lewra Xuda Teala bi qudret û mezinatîya xwe îslamê diparêze.

Ji xwe malûm e, pêzan e ku mislimanên bi prensîbên dînê xwe pêbend in; ewên ku dilên wan ji hezkirin û mehebbeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] tije bûye, ji qelemên jehrdarên ku êrîşan tînin ser îslamê û ew xwe jî nas

218. Îbnmace, Mûqeddîme, 11

nakin, hest bi êş û elemeke zehf zêde dikin.. Ev qelemên ha, wekî maran e ku di tarîtîyê de dijîn, ji bo acizkirin û tolhildanê jî car caran hereket dikin.

Divê em zanibin ku Xuda Teala lutf û kerema xwe li însên kiriye û meyla heq û heqîqetê xistiye fitreta wî. Ji lewma ti kes nikare wê meyla heq û heqîqetê ji fitreta wî xîç bike, jê bibe. Digel ku îlhad û înkar hewl dide bi her cureyên zulm û serkutkirinê belav bibe jî, dîsa nekariye şînbûn û kokberdana rayên dînê bilindê ku xwe di kûrahîya rûh, dil û wijdanê de berdaye, asteng bike û rê li berê bigre. Însan nikare îhtiyaca xwe ya ku di xwe nêzîk-kirina ji Xuda Teala de temsîl dibe, asteng bike û rê li berê bigre. Ne mûmkin e, ew bikare seadet û dilşadîya bilinda ku di fitreta wî de heye, asteng bike. Lewra qudreta îlahî, îhtiyaca dînî û xwe nêzîk-kirina ji Rebbê alemê xistiye sunnetûllah, yanî Cenabê Heq Teala ew wek qaîdeyên ku naguherin teqdîr û dîyar kirine.

Hezretê Mewlana wan kesên ku xwe li hemberî heqîqetê kor dikin û ew ğafilên ku hewl didin nûra îlahî bimevirînin çi xweş teswîr dike, dibêje:

“*Ewê ku eyban ji roja ku dinyaya me rohnî dike re çêke û têde li kêmasîyan bigere; ew dibêje herdu çavên min kor in, tarîtî ye, çavên min şevetarî ne, nabînin.*”

“*Heke Xuda bixwaze perda yekî bidirîne û eybên wî bavêje holê, ezm û daxwazîya şermezarkirina mirovên temîz dixe dilê.*”

Divê însanîyet bifikre ka ewê çawa şukran û spasîya xwe ji bo Hezretê Pêxember bîne zimên, ne ku ew kêmasîyê

bîne ser wî. Lewra wî, ji dema ji dê-bûna xwe heta bi wefata xwe, wî her ji bo rizgarî û hîdayeta însan cehd û xebat kiriye. Naxwe ew dilê ku li hemberî vê cehd û xebata wî ji hest û hisên şukranê wî tije nebe, ne dil e.

Dilê wî ewqas bi ummeta wî ve ye, dê-bavek çi qeder ji zarokên xwe hez dikin hezkirin û mehebbeta mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji me hê zehftir e.. Mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ew pêğember e ku bi eşkerehî gotiye; ti beşerek bi qasî wî nehatiye tirsandin, ti kesî bi qasî wî meşeqqet û ezîyet nedîtiye, ti kes bi qasî wî ji bo birçîbûnê rûbirû nehatiye hiştin..[219] Feqet wijdana wî ji vê ne bi gazind û gilehdar e. Lêbelê wê êş û cefaya ku ummeta wî dikişand, dilê wî dişewitand. Ew ji me re ewqas bi merhemet û dilovan bû û fikra wî ewqas li ser me bû ku wî li dinyayê çawa ji bo rizgarî û ef û meğfîreta me cehd û xebat dikir, eynî wilo ewê roja mehşerê [cihê kombûnê] di bin Erş de jî me bifikre. Ewê biçe sicûdê û ji bo şefaeta me bike, hêstir her dê ji çavên wî bibarin û ewê her li ber Xuda Teala bigere, heta ev dûaya wî were qebûlkirin...[220]

Bi vî awayî, ew pêğemberê ku hem li dinyayê, hem jî li axretê ji bo şefaet û mehdera me cehd û xebat dike, wek şukran û spasîya ji wî re divê îro em jî bibin mûmînekî ku wî arzû-kirî. Divê em wî ji canê xwe ezîztir bigrin û ji bo bibin dilekî ku ji bo wî bibe evîndar jî divê em jî cehd û xebat bikin ne wilo?

219. Tirmizî, Qîyamet, 34/2472
220. Li Buxarî, Enbîya, 3, 9; Muslim, Îman, 327, 328; Tirmizî, Qiyamet, 10’an binêrin.

**Hezker Bi Xebera Hezkirîya Xwe Dike**

Hezretê pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di hedîsa şerîf de wiha dibêje:

"*Însan ji kî hez bike, bi wî re ye*."[221] Gelo em çi qeder ji mezinê xwe pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] hez dikin?

Divê em fehm bikin ku hezkirineke heqîqî, pevrebûneke di navbera hezker û hezkirî de tê parvekirin. Wekî qanûna hevgirtina firağan a fîzîkê, pevrebûneke heqîqî jî; lazim dike ku ew bi rewşa transferê bişibihin hev û di navbera wan de di rewîşt û şexsîyetê de jî hevpişkî were meydanê. Însan, hem bi peyva xwe, hem jî bi zatê xwe bi hezkirîyê xwe re dibe, bi bizav û hereketên xwe pêre dibe, bi hest û ramana xwe pê re dibe û bi jîyana xwe jî pê re dibe.

Yanî heke di hezkirinê de pevrebûneke wiha nebe, hezker jî rêyeke li dijî hezkirîyê xwe bigre, hingê ew neşê bi hezkirîyê xwe re bibe. Lewra naxwe hingê ew di meneya rastî de jê hez nake.

Li gorî vê, naxwe em çi qeder ji mezinê xwe Pêğember hez dikin? Em çi qeder xwe bi sunneta senîyye'ya wî digrin? Em çi qeder mezinê xwe Pêğember ji zarokên xwe û hawîrdora xwe re vedibêjin? Gelo em bi qelbê xwe çi qeder bi herdu emanetê wî Qur'ana Pîroz û Ehlê Beyta wî re dibin? Gelo xanîyên me ji xanîyên wan ehlê Beytê yên

221. Buxarî, Edeb, 96

ku ji rûhanîyeta Qur'an û Sunnetê tije bûne, çi qeder ji xanîyên wan nesîbdar dibin?..

### Li Pey Çûna Wî, Perwerde û Tehsîla Dilî Dixwaze

Ji bo seadeta xwe ya li vê dinyaya bêîstiqrar û li mehşera ku meydana feryad û fîğana ye, zehf zerûrî û bivê-nevê ye ku di her sefhe û qûnağên jîyana xwe de em mezinê me xwe Pêğember ji xwe re bikin nimûne. Divê em wî di heyata sosyal û civakî de ji xwe re bikin nimûne. Divê em wî di heyata malbatî û aîlewî de ji xwe re bikin nimûne. Divê em wî di heyata xwe ya kar de jî ji xwe re bikin nimûne. Lewra ew, ji qedema jêrê, heta bi qedema jorê ji bo hemû mirovan tekane nimûne ye..

Gelo em çawa wî ji xwe re bikin nimûne? Gelo emê wî bi xwendina ji kağezekê ji xwe re bikin nimûne? Na. Emê di dinyaya dilê xwe de tehsîl û perwerda wê nimûnê bikin..

Cenabê Heq Teala usûla vê tehsîlê jî bi eşkerehî wiha dibêje:

"**Sûnd be ku ji bo we, di Resûlûllah de ji bo wî yê ku Xuda û roja dawîyê hêvî dike û Xuda di bîra xwe pirr tîne, nimûneyeke sipehî û kamil heye**."[222]

**Şertê yekê;** divê mirov gihiştina Xuda Teala hêvî bike. Divê mirov ti caran ji bîr neke ku emê li hizûra îlahî hesab bidin û tim û daîm em bi vê hest û şiûrê bijîn.

222. Ehzab, 33/21

**Şertê duduyan;** divê mirov gihiştina axretê hêvî bike û bi awayekî binbirr û qet‘î wê bawer bike. Divê mirov fanîbûnê fehm bike û mirov ji sirrên wê derbas bibe.

**Hezretê Mewlana** çi xweş vê îfade dike:

“*Heyata dinyayê ji xewnekê pêktê. Bûna xwediyê serwetê li dinyayê dişibihe dîtina defînê di xew de. Malê dinyayê li dinyayê dimîne, ji nifşekî digihe nifşeke din*.”

Ji vê hêlê ve zerûrî ye ku em baş zanibin, em li dinyaya îmtîhanê ne. Bila em bi vî awayî arzûyên nefsanî yên xwe berteref bikin û em dilê xwe bikin rêwîyê bêdawîyê. Divê em derece û qiwameke wilo qezenc bikin ku axret ji bo me bibe meydana gihiştinê. Ji bo bidestxistina vê, şert e mirov ji **usweyê hesene** yê Mezinê me, yanî ji şexsîyeta nimûneyî ya wî para xwe wergire. Ew çağ Cenabê Heq Teala soza cennetê ji me re dide û eşkere dike ku ewê gihiştina cemala xwe ji me re îhsan bike.

**Şertê sisêyan;** divê mirov zehf zikrê Xuda Teala bike. Divê dilê mirov tim û daîm bi cenabê Heq Teala re be. Çi qeder pevrebûn? Xuda Teala bersiva vê pirsê jî di ayeteke din de wiha dide: “**Ha ew in, yên ku rabûyî û rûniştî û li ser teniştên xwe gêrkirî Xuda di bîra xwe tînin**.”[223] yanî pevrebûneke seraqetî û daîmî ye... Divê em hestpê bikin ku em tim û daîm di bin kameraya îlahî de ne... Rebbê me ji şahraya me jî ji me nêzîktir e. Gelo em çi qeder ji wî nêzîk in? Ha ji bo em vê nêzîkbûnê dabîn û temîn bikin divê em mezinê

223. Alî Îmran, 3/191

xwe pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji xwe re bikin nimûne.

**Qedrê Hezretê Pêğember û Em**

Heta em qedr û şerefa mezinê xwe pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] îdrak û tehsîl nekin, ne mûmkin e em bikarin bi ber Xuda Teala ve rê qut bikin û jê nêzîk bibin. Çawa ku Cenabê Heq Teala di Qur'ana Pîroz de bi awayekî taybetî qedr û qîmetê Hezretê Pêğember ji me re wiha îfade dike, dibêje:

“**Bêguman Ellah û ferîşteyên wî selatan li ser Muhemmed pêğember didin. Gelî yên ku îman anîne! Naxwe hûn jî selewatan li ser wî bidin û tam bi teslîmiyet silavan li wî bikin**.”[224]

Cenabê Heq Teala jî selewatan li ser mezinê me Pêğember dide. Ew bi xwe û melaîketên wî li ser bilindtirîn mexlûqê ku wî aferandiye, selewatan didin. Keyfîyet û çawabûnîya rastî ya vê, ne mûmkin e ku qelbê me, hesta me û têgihiştin û îdraka me wê fehm bike. Gelo cenabê Heq Teala selewatan çawa li ser mexlûqê ku wî aferadiye, dide? Digel ku di vê xusûsê de hinek îzahat û şîrove hene jî, lêbelê di heqîqeta xwe de ew sirreke îlahî ye. Feqet ev eşkere ye; mehebbet û îtînayeke [giringî-pêdaneke] mûstesna ya cenabê Heq Teala ji bo mezinê me Pêğember heye. Xuda Teala dixwaze em jî vê fehm bikin. Ew wiha ferman dike, dibêje:

224. Ehzab, 33/56

**“Naxwe hûn jî selewatan li ser wî bidin û tam bi teslîmiyet silavan li wî bikin**.”[225]

Lêbelê divê em van selewatan û van selaman ne bi zimanê xwe tenê li ser mezinê xwe bidin. Divê her halê me selat û selaman li ser wî bide. Divê heyata aîlewî ya me, heyata me ya kar, danûstandina me ya bi însanan re û her hal û hereketên me di qiwam û asteke wisan de xuya bibe ku ew ji bo selat û selaman li ser Pêğember bide, layiq bin.

Mesela, divê ew vê tefekkur bike, gelo mezinê me Resûlûllah heke heyata aîlewî ya min, ticareta min, danûstandina min ya bi mirovan re û hal û tevgerên min bibîne, ewê ji bo wan tebessum bike, bikene? Gelo ewê ji bo perwerda ku ez didin zarokên xwe bikene? Gelo ewê ji bo heyata îbadetî ya min bikene?

Heke em îro van pirsan ji xwe nekin û em hesabê ji nefsa xwe û dilê xwe nepirsin, heke em xwe rast û durust nekin, sibe roja mehşerê hesab û mêzîna me dê hîn dehşetdartir bibe. Bêşiwar roja qiyametê dê ji me tevan re were gotin:

**“De kitêba xwe bixwîne! Îro, wek hesabpirs nefsa te besî te ye**.”[226]

Ew dem, emê di deftera emelê xwe de her halê xwe yê bidizî bibînin. Emê fîlmê heyata xwe seyr bikin. Emê bibînin ka me nimêjên xwe çawa eda kirine? Me rojîya xwe çawa girtiye? Gelo me bi awayekî şeklî îbadet kiriye, yan jî me bi rûh û qelbê xwe kariye erka îbadetê xwe bîne cih? Gelo li

225. Ehzab, 33/56
226. Îsra, 17/14

hemberî nîmetên bêjimar ên ku Xuda Teala li dinyayê dane me, me çi kiriye? Gelo ji rûh û can, eql, zeka, dirav û pere û mal û milkê ku Xuda Teala dabûne me, me kariye çi qederî jê înfaq bike? Me çi qeder jê hewante û pûç xerc kiriye? Gelo me çi qeder ji Xuda û pêğemberê wî hez kiriye? Gelo me çi qeder exlaqê xwe kiriye wekî exlaqê Xuda û pêğemberê wî?

Sibe ev hemû, di deftera emelê me de ji me re dê werin şanîdan û di ekranên qiyametê de ewê bi me bên temaşekirin. Çawa ku Xuda Teala di ayeta pîroz de wiha dibêje:

"**Paşê, dema ew têne wê derê, guhên wan, çavên wan û çermên wan li ser xirab-karên ku dikirin, dibin şahid!**"[227]

Ji ber vê sedemê, divê em jî zûbizû halê xwe mûhasebe bikin:

Gelo çavên me çi temaşe dikin?..

Gelo guhên me çi qeder li wehîya îlahî û peyamên nebewî guhdarî dikin?..

Gelo em çi qeder bedena xwe û îmkanên xwe di rêya heqîyê de bikartînin?..

**Welhasil** mesela eslî ev e; hê firsend di destê me de bila em xwe di ber çavan re derbas bikin û em tedbîrên pêwîst û lazim bigrin.

227. Fussîlet, 41/20

**Îmtîhana Hezkirin û Edebê**

Însan hemû di dinyaya îmtîhanê de ne. Yanî ev dinya, dersxaneyeke îmtîhana îlahî ye. Li vir, yek ji îmtîhanên mûhîm û giring jî li hemberî Hezretê Pêğember xusûsa hezkirin, îtaet û edebê ye. Cenabê Heq Teala ferman dike, dibêje:

**"Gelî yên ku îman anîne! Bi xebera Ellah bikin, bi xebera pêğember bikin û bi gunehan karên xwe jî pûç nekin!"**[228]

**"Gelî yên ku îman anîne! Li ber Xuda û pêğemberê wî, bi gotinekê, yan jî kirinekê nekevin pêşiya wî** [li dijî qerarên wî dernekevin] **û xwe ji hêrsa Xuda biparêzin. Bêguman Xuda bîser û zana ye. Gelî yên ku îman anîne! Dema pêğember biaxive û hûn jî biaxivin, dengê xwe bi ser yê pêğember nexin! Dema ew neaxive û hûn jî pê re biaxivin, çawa hûn bi dengê bilind gazî hev dikin, wisa bi dengê bilind gazî pêğember nekin! Heke hûn pê re bi edeb neaxivin, bêyî ku haya we jê çêbibe, dê 'emelên we pûç bibin. Bêguman ewên ku li cem peyğamberê Xuda dengê xwe nizm dikin ha ew in! Ewên ku Xuda dilên wan ji bo teqwayê îmtîhan kiriye da ku ji wan eşkere bibe. Ji wan re lêborîn û xelateke mezin heye. Bi rastî ewên ku ji piştê odeyan bi dengê bilind gazî te dikin pirrên wan tênagihin."** [229]

Naxwe nezaketa me ya ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re, li peyçûna me ji bo Sunneta senîyye'ya wî, ji nêzîk ve naskirina me ji bo pêğemberê Xuda

228. Mûhemmed, 47/33
229. Hucûrat, 49/2-4

[dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo dilê me îmtîhaneke teqwayê ye. Ew navgîn û wesîleya nirxandina evîndarîya me ji wî re ye. Di eynî zemanî de ew wesîleya nêzîkbûna ji Xuda ye jî..

Naxwe ewên ku li hemberî mezinê me Resûlûllah bi hovîtî tevdigerin, ji dûr ve bi dengê bilind gazî wî dikin û li hemberî wî bêedebîyê dikin, ew kesên tênegiha û sefîh in.

Li vir, netîceyeke din a ku ji bo me derdikeve jî ev e; divê em pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] çawa ji xwe re bikin nimûne? Divê em heyata xwe çawa bixin wekî heyata wî? Di vê xusûsê de telîmata eşkere ya Qur'ana Pîroz ji bo me ev e:

"**Kî, bi gotina Pêğemberî bike, hemin wî bi gotina Xuda kiriye û kî, berê xwe jê vegerîne, me tu ji wan re wek parêzkar ne şand î!**"[230]

**Pîvan û Endaz Di Hezkirina Wî De**

Ev hadîse û bûyera ku Ebdûllah kurê Hîşam vedibêje, pirr manedar e. Lewra ew ji me re nîşan dide ka divê hezkirina pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] di kîjan astê de be:

"Carekê ez bi pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re bûm. Hezretê Ûmer [Xuda jê razî be] jî li wir bû, Resûlê Ekrem [dirûd û silavên Xuda lê bin] destê wî xistibû nav destê xwe û wilo rûniştibû. Di wê navê de Ûmer jê re got:

230. Nîsa, 4/80

"-Ya Resûlellah! Ji bilî canê min, ew tenê ne têde, wekî tu ji her tiştên min ên din ji min re hezkirîtir î!" Bi vî awayî mehebbet û hezkirina xwe ya ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] îfade kir.

Hezretê Pêğember li hemberî vê gotina wî wiha got:

"*-Na, ez bi wî Xudayî sûnd dixwim ku canê min di destê qudreta wî de ye, heta ku ez ji canê te jî ji te re ne hezkirîtir bim tu nabî mûmînê heqîqî!*"

Hezretê Ûmer [Xuda jê razî be] derhal got:

"-Naxwe ya Resûlellah, ez bi Xuda sûnd dixwim ku vêga tu ji canê min jî ji min re hezkirîtir î!" Vêca pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] jê re got:

"- *Ha vêga çêbû ya Ûmer!*"[231]

Ha, divê em bi evîn û hezkirineke wiha ji bo mezinê xwe Mûhemmed Mûstefa [dirûd û silavên Xuda lê bin] bibin peyrew û pêbend. Divê em wî bikin tekane siltanê textê dilê xwe û rêzanê jîyana xwe. Lewra hezkirina wî, li ser me hatiye ferzkirin.[232] Heq Teala di Qur'ana Pîroz de dibêje:

"**Pêğember, ji bo bawermendan ji nefsa wan bi xwe jî çêtir û li pêştir e**."[233] Ew, ji bo me ji canê me jî nêzîktir û lipêştir e.

231. Buxarî, Eyam, 3
232. Li Tewbe, 9/24'an binêrin.
233. Ehzab, 33/6

Li ser vî esasî, di hedîsa şerîf de jî hatiye zikrkirin ku mehebbet û hezkirina mezinê me, pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo bûna îmana heqîqî şert e:

"*Ez, bi wî Xudayî sûnd dixwim ku nefsa min di destê qudreta wî de ye, heta ez ji bo yekî ji we ji nefsa wî, ji dêya wî, ji bavê wî, ji zarûzêçên wî û ji hemû însanan ne hezkirîtir bim, ew bi meneya heqîqî nabe mûmîn.*"[234]

Li ser vî esasî, eshabê kîram li hemberî arzûyeke biçûktirîna mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] bilez û bê tereddud digotin:

"Eman ya Resûlellah, bila bavê min, canê min û her tiştê min bi gorî te be!" û bi her navgînê hezkirina xwe ji wî tomar û tescîl kirine.

Li hemberî vê mehebbet û hezkirinê bê qeyd mayîn, ji vê jî wêdetir bêhurmet hereket-kirin berhem û esereke cehaletê ye. Xwe girtina bi vê mehebbetê jî recete'ya xilasîyê ye.

**Elametê Hezkirina Ji Wî**

Însan ji kê hez bike, zehf behsa wî dike, bi her wesîle û navgînê ji hezkirîyê xwe dipeyive û di bara mijarên li ser wî de diaxive.

Karsazekî ku ji dil û can xwe dabe karê xwe, tim ji bazirganî û ticareta xwe dipeyive. Min wiha qezenc kir, min wiha winda kir. Li wir, ev kar û qezenc heye. Li vir jî ev kar û

234. Buxarî, Îman, 8

qezenc heye û hwd.. Dilê hinek mirovan zehf bi zarokên wan ve ye, ew jî her zeman û li her derê behsa zarokên xwe dikin.

Feqet eshabê kîram û ewlîyaûllah ji mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re bûne meftûn û wan tim û daîm bi heyrantîyeke mezin jê xeber daye û ji vê jî lezzeteke bêterîf his kirine.

Ha ev e naskirin, teqlîdkirin û îştiyaqa tije-eşq û evîna ji pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo li axretê em pê re bibin! Cenabê Heq Teala ji nêzîk ve naskirin û hezkirina mezinê me pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji bo me tevan îhsan bike. Amîn!..

Hevhal-bûna bi halê hezkirîyê xwe û hewldana hezkerî ya daîmî ji bo bikeve rêya hezkirîyê xwe yek ji wan sirrên veşartî yên di "mehebbet"ê de ye ku ew jî sersebebê hebûna alemê ye. Hezker çi qeder bi îstîdad û bêîstîdad be jî dîsa li gorî şanê mirovê ku jê hez dike, encamekê bidestdixe.

**Vegotina Wî Bi Awayekî Layiq Zehf Zor e**

Xalid bin Welîd [Xuda jê razî be] di esnaya serîyyekekê [nijdeyekê] de li cem hoz û eşîreteke misliman barê xwe danîbû. Serekê eşîretê jê re gotibû:

"Ji kerema xwe, ji me re behsa mezinê me Mûhemmed bike?"

Xalid bin Welîd jê re got:

"Ez nikarim wan sipehîtîyên ebedî yên pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] ji we re vebêjim. Heke tu dixwazî ez bi tefsîlatên wê ji te re vebêjim, ev ne mûmkin e!"

Çi dema serekê eşîrê jê re got:

"Naxwe bi qasî tu dizanî wî ji me re vebêje! Wî bi xulase û kurt vebêje!" Hezretê Xalid ev bersiv dayê:

"Şandî bi qasî yê ku ew şandiye dibe!... [Yê ku ew şandiye Rebbê alemê ye, li gorî ew xaliq û aferînerê kaînatê ye, naxwe yê şandî şanê wî heye, tu wî hesab bike!][235]

**Cenabê Heq ji evîna eshabê kîram ya ji Hezretê Pêğember ji bo me bike nesîb! Sipehî-kirina heyata me bi mûhebbeta mezinê me Resûlûllah ji me re îhsan bike!**

**Amîn!..**

235. El-Mûnawî, Fethûl-Qedîr, cild, V, 92/6478; el-Qestelanî, tercuma Mewahîbûl-Ledunîyye, Îstanbûl 1984, rûpel, 417.

# Paşgotin

Ji bo em bigihin şefaeta mezinê me Resûlûllah [dirûd û silavên Xuda lê bin], divê em mûhasebe bikin ka di xusûsa lipeyçûn û îttîbabûna wî de di kîjan nuqtê de ne, divê em heyata xwe li gorî wan pîvan û endazên nebewî yên ku di wan de hatine eşkere kirin biwezinînin û em bikevin şûv û meydaneke tefekkur û ğeyretê.. Divê em her hewl û xebatê bikin ji bo di nav feyz û heyecanê de heyateke ku babet û layiqê ummeta wî be, di îbadetê xwe, hal û hereketên xwe, his û hestên xwe, fikr û ramanên xwe, îroya xwe, sibêya xwe de..

**Welhasil** dinya û axreta xwe de sipehîtî û kûrahîyên wî yên bêhemta bidin xuyakirin.. Lewra însan, bi qasî pîvana hezkirina xwe ji hezkirîyê xwe wek meftûnî teqlîd dike. Ji bo mirov karibe bi awayekî lazim teqîb û teqlîda Nûra Hebûnê bike, divê mirov bi maneya rastîn wî nas bike û hewl bide ji bo bi awayekî layiq şexsîyeta nimûneyî ya wî binirxîne.

Lewra zevîyek çi qeder berhemdar bibe, bila ew qeder berhemdar bibe, heta ewrên baranê û bayê bihara bi tav lê nebare, ew şîn nabe. Ji bo dil bibe wekî axeke berhemdar û şînker, divê mirov ji bo mezinê xwe Fexrê Kaînatê ku ji bo însanîyetê ûswe'yê hesene ye, ram û teslîm bibe.

Lewra ew, ji hemû mirovên pêşî û paşîyan tevan çêtir e, serkehnîya neçikeha fezîlet û kereman e; sersebebê hemû

rehm û bereketên li alemê ye. Ew Qur'ana Pîroza ku ji heqîqetên ezelî û ebedî tije ye, ji wî re hatiye xwarê; ew ji cîhana îmanê re kiriye yadîgar û xelat.

Encama nîhaî û umûmî ya ku ji van hemû tiştên me gotî derdikeve ev e; em ji mezinê xwe pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] re, yan jî ji bo her tiştê ku di miqdarekî cuzî de jî bibe navgîn û wesîleya dibîrxistina wî îhtîramê şanî bidin, dîsa hindik e!. Lewra ew Pêğemberê Mezin, ji terefê Xuda Teala yê "Mûteal" ê ku ne mûmkin e însan karibe wî xeyal û îdrak bike, bûye mezher û xuyageh ji xîtaba îlahî ya bı "Hebîbê min" re. Ev Pêğemberê Mezinê ku Xaliqê Mezinê kaînatê û melaîketên bêjimar pevre "selat û selam" li ser wî dane. Ne mûmkin e, mirov bi îmkana çend kelîme û peyvên mehdûd û tixûbdar karibe ji fezl û kemala vî Pêğemberê Mezin nêzîk bibe û karibe wî îdrak û îhate bike.

Di rastîyê de îtîrafkirin û îlankirina bilindahîya mertebeya wî mijareke wisan e ku ji teslîmbûn û iqrarkirina bi mezinatîya şanê wî pê ve tişteke din qebûl nake û di vê xusûsê de jî ji huşbûn û sikûta ebedî pê ve tişteke din li para me nakeve. Dema di tesewwirkirin û şayesandina wî de ziman di eczîyet û nekarînê de be, naxwe her tişta ku em bi zimanê xwe di bara wî de îfade dikin, her wekî dilopek-ava ji okyanûsê ye. Ew jî wekî şebneman e ku ji wî bi ser têgihiştin û îdraka me de dipalin...

Xwezîya me bi wan mûnînan be ku ji evîn û mehebbeta pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin] pê ve dilê xwe nadin dîgerên wî û ew xwe bi çîçekên sexte yên bexçeyên çolî naxapin!..

Bila em bi her zerreyeke xwe rûhanîyeta wî teneffus bikin û berê xwe bidin Rebbê xwe...

Bila em mehebbeta wî huccet bigrin û pê li ber Rebbê xwe bigerin…

*Selewat li ser wî seyyîdil-kewneyn Mûhemmed Mûstefa bin!..*

*Selewat li ser wî Resûlûs-Seqeleyn Mûhemmed Mûstefa bin!..*

*Selewat li ser wî Îmamûl-Heremeyn Mûhemmed Mûstefa bin!..*

*Selewat li ser wî Ceddûl-Heseneyn Mûhemmed Mûstefa bin!...*

اَللّٰهُمَّ صَلِّ عَلٰى مُحَمَّدٍ وَعَلٰى اٰلِهِ

وَصَحْبِهِ وَبَارِكْ وَسَلِّمْ

**Ellahumme Sellî ela Mûhemmedin we ela alihî wesehbihî webarik wesellem**

**Cenabê Heq Teala, me bi awayê layiq ji şexsîyeta nimûneyî ya rêberê seadet û bextewarîya ebedîya me, mezinê me Resûlûllah bike xwedî par û dinya û axreta me ji xuyahîyên sipehîtîyên wî tacdar û nesîbdar bike. Ji rûhanîyetên ferehên wî şebnemên feyyaz û verohtêk ji bo dilê me îhsan bike! Qelbên me, ji bo hezkirin û mehebbeta Xuda Û Pêğemberê wî bike mekanekî ebedî! Cenabê Heq Teala şefaeta 'uzmaya** [mezıntırina] **wî bike para me tevan!..**

**Amîn!..**

## Ji Bo Me Çi Şerefeke Mezin e Ku Em Ji Wî Re Ummet Bin

*Li kuderê sipehîtîyek hebe, ew eks û xuyabûnek ji wî ye.*

*Li alemê çîçekek bel nabe, heke ne ji nûra wî be!*

*Ew e ku em ji bo xatirê wî hene. Ew naqermiçe, berevajî vê her ku roj bi ser de derbas dibin tazetî û terîtîya wî hîn zêdetir dibe, ew ğunçeyeke îlahî ye ku ji serê xwe heta bi pêyê xwe ji nûrê ye...*

❁

*Nêzîkbûna ji heqîqeta Mûhemmedî*

*ji eql zêdetir, karê dil û teslîmîyetê ye.*

*Îdraka me li hemberî heqîqeta Mûhemmedî,*

*Di bara fehmkirina bûyerên metafîzîkê de,*

*ji îdraka zarokekî ne cudatir e.*

❁

*Cenabê Heq Teala modêla "însanê kamil"ê ku bi îslamê mûrad kirî, ew di şexsîyeta mezinê me, Hezretê Pêğember de şanî daye,*

*Ew ji bo hemû alema însanîyetê kiriye şexsîyeteke nimûneyî ya bêhemta.*

❁

*Di tarîxê de tekane însanê ku heta bi teferrûatên biçûktirîn jî. Heyata wî hatiye tesbîtkirin mezinê me Hezretê Pêğember e.*

*Di kultura îslamê de hemû eserên ku hatine nivîsandin, mehsûl û berê xebat û hewldana îzahkirina însanek û kitêbekî ye.*

❁

Heyata mezinê me Fexrê Kaînatê; bi hemû reng, aheng û cureyên xwe yên ku bi çîçekên mûstesnatirîn hatiye xemilandin. Bexçeyekî cennetê di bîra mirov tîne ku ew ji bo xwe li çîçekan digerin, dikarin di wê gulistanê de sipehîtirîn gulan bibînin.

❁

*Mezinê me ferman dike: "Ji bilî asîyên însan û cinan, wekî din. Her tiştên li navbera erd û asîmanî dizanin ku ez Resûlê Xuda me."*[236]

*Uhudê ew nas kir, qurmê darxurmê ew nas kir û bi hesreta wî nalîya, Heywanatan jî xwe avêt ber penaha wî û ew ji xwe re kir şirîkê derdan... Lakin Ebûcehl û yên wekî wî doh ew nas nekiribûn û îro jî ew nas nekirine...*

❁

*Sîreta mezinê me Resûlê Ekrem wekî eyneyeke berraq e; her însan, li wir hinavê xwe û derveyê xwe, gotina xwe û emelê xwe, exlaqê xwe û edebên xwe temaşe dike, sewiya xwe dibîne û dikare rewşa xwe biwezinîne.*

❁

236. Ehmed, III, 310

*Ewên ku li hemberî wê rêya ku Xuda û pêğemberê wî nîşan dane, derdikevin û li mislimanan zulm kirine, ewê zû yan jî dereng her li ezabê ğemnakê qudreta îlahî û tecellîyatên întîqama wî rast bên. Ev qanûneke îlahî ya misoger û neguhêrber e.*

❁

Dîsa tekane serkehnîya rehm û mehebbeta ku însên dibe ser deryaya hezkirina Xuda, mezinê me Hezretê Pêğember e.

❁

*Tuxmê eşq û evînê bes di axa mehebbeta wî de şîn dibe.*

*Ew serkehnîya feyz û bereketa dil e; axa mehebbeta wî,*

*Çendîn dilên wekî kevir hişkûhola di safîyeta gewherekî de bilind û paqij kiriye.*

❁

*Dema dinya di reş-tarîya cahilîyetê de hatibû definkirin de,*

*Divê em wan ğeyretên canxiraş ê ku Resûlê Xuda bi tena serê xwe şanî daye ji bo xilasîya ebedî ji însanîyetê re ragihîne, ji bîr nekin û divê em tefekkur bikin ka îro em çi qeder di nav wan ğeyretan de ne.*

❁

*Xwezîya me bi wan mûmînan be ku ji eşq û evîna mezinê me Pêğember û eshabê kîram para xwe wergirtine, qelbên wan bi wecda îmanê, dilên wan bi rûhanîyeta Qur'anê, rûh û giyanên wan bi dilşadîya xizmetê, wijdanên wan bi berraqîya*

*exlaq xemilîne û di nav çêj û şîranîya manewî ya seadeta ebedî de dijîn..*

**Ya Rebbî!**

**Me bike ji evîndarên Pêğember, ewên ku di halê Qur'aneke zindî de Îslamê dijîn! Mehebbeta Xuda û pêğemberê wî bike sermayê me ji bo seadeta ebedî!**

**Amîn!...**

# Ferhengok

**-A-**

**Abad**: Ava, tije heyat.

**Abid**: Îbadetkar, zahid.

**Adîlane**: Bi edaletî, bi dadmendî.

**Agahî**: Xeber, malûmat.

**Ajar**: Nîmet, lutf, kerem.

**‘Alî**: Bilind, mezin.

**Alîcenab**: Comerd, şerefmend, bi heysîyet.

**Amade**: Hazir, vebohtî, fermanber.

**Arîsto**: Fîlozofekî navdar e.

**Asî**: Îsyankar, serhildêr.

**Asîman**: Asman, jora dinyayê, banê erdê ye.

**Aso**: Ufûq.

**Axirzeman**: Serdema dawîya vê dinyayê ye, dema nêzîkbûna qiyametê ye.

**-B-**

**Bandor**: Tesîr, kartêkirin.

**Batin**: Navî, naverû, veşartî, nedîyar, nedîtber.

**Batinî**: Navxweyî, hundirî.

**Bêcan**: Bêrûh, bêgiyan.

**Bêçare**: Neçar, lawaz, weza, bêhêz, bêmecal, ketî.

**Belağet**: Îlmê qaîdeyên Edebîyatê. Tekûzîya di peyv û nivîsê de. Îfadeya bi tesîr û bi huner.

**Belîğ**: Fesîh, zelal, tekûz.

**Bende**: Kole, evd, ne-azad.

**Berbat**: Xirab, berba-ketî, bêkêr.

**Bereket**: Xêr û xweşîya ku naqede, t‘em-jê dîtin e.

**Berraq**: Rohnak, berqînok.

**Besîret**: Dîtina bi qelbî, dîtina rast û bi endaz, dûrbîn, feraset, fehmkirin.

**Bevken**: Tebessum, kenê bê dev vekirin e.

**Bextewarî**: Dilşadî, aramî, hizûra dil û wijdanî ye.

**Beyhûde**: Bê feyde, bê mûfa, li ber çav nayê girtin,

**Beyt**: Malikê şiêran e.

**Bijarte**: Neqandî, ji nav gellekan veqetandî, hatî tercîhkirin.

**Buhran**: Krîz û qeyran.

## -C-

**Candar**: Zindî, rûhber, xwedî rûh, giyanewer.

**Cedûl-Heseneyn**: Kalê Hesen û Hûseyn.

**Cehalet**: Nezanî, nefehm, tênegiha.

**Cemal**: Sipehîtî, xweşikahî, bedewî, delalî.

**Cemala bi-kemal**: Sipehîtiyeke bi kemal. Sipehîtîya îlahî.

**Cemala îlahî**: Sipehîtîya Xuda,

**Cemalûllah**: Sipehîtîya bêdawîya Heq Teala.

**Cem-kirin**: Komkirin, berhevkirin.

**Cenewar**: Candar, wehşî, hov, rûhdar, xwedî rûh, ne-însan.

**Cesûr**: Mêrxas, nebez, gernas, egît, wêrek, çavnetirs.

**Cîhangîr**: Dinyagir, padîşah, fetihkar.

**Cîhanîyan**: Însan û cin, alemîn.

**Civak**: Komel, kom, civat, cemîyet.

## -Ç-

**Çetîn**: Dijwar, tund, nebez.

**Çewt**: Şaş, ğelet, nerast, nedurust.

**Çetr**: Çadir, kon.

**Çol**: Cihê ku însan lê najîn, cihê terikandî.

**Çolî**: Însanê ku li çolê dijî.

## -D-

**Dad**: Edalet, heq.

**Deccal**: Ew yekçav, elametê qiyametê yê ku di dawîyê de dertê.

**Delalet**: Jirêderketin, rêşaşî, ji hîdayetê ketin.

**Derya**: Behr, nebejî.

**Derûn**: Nav xwe, alema derûnî, alema nava xwe.

**Dewlet**: Welat, memleket, qismet, şens.

**Dewr**: Rêz û nobet, serdem, zeman.

**Dijwar**: Tund, çetîn, sert.

**Dîrayet**: Zekawet, agahî, tije-fehm, têgihayî.

**Dirinde**: mûfteris, perçeker, kerker-kar.

**Dirûd**: Selat, şabaş û tebrîk.

**Dîyarî**: Hedîye, xelat.

**Doz**: Dewe, boçûn, hedef.

**Dûa**: xwestin, daxwazkirin, lavlavkirin, bergerîn.

## -E-

**‘Ela ‘îllîyyîn**: Bilindtirîn qata cennetê ye.

**Ebedî**: Bêdawî, daîmî, herûher, heta hetayê.

**Eczîyet**: Nekarîn, bêçaretî, bê qewetî.

**Ehd**: Soz, peyman, we‘d.

**Ehkam**: Geljimareya hukman e. Yanî hukm û ferman.

**Enene**: Adet, kevneşopî.

**Erd**: Ax, dinya.

**Erebistan**: Welatê Ereban.

**Esalet**: Zadeganî, kurebavî, kokdarî.

**Esfele safilîn**: Jêra jêrîn, nizma ji hemû nizman nizmtir.

**Esfîya**: Safîyan, dilpaqijan.

**Etqîya**: Mûtteqî, Xuda-nas, dînperwer.

**Enbîya**: Nebîyan, resûlan, şandeyan, qasidan, pêğemberan.

**Ewlîya**: Welîyan, nêzîkên Xuda, qencên Xuda.

**Ewam**: Xelk, amî, ne xewas.

**Exlaq**: Rewîşt, sinçî, exlaq.

**Ezmûn**: Îmtîhan, tecrûbe.

**-F-**

**Farîqe**: Cudaker, veqetîner,

**Feqet**: Lêbelê, emma, belam, lakin.

**Ferman**: Emr, telîmat.

**Fereh-nak**: Dilxweşker, keyfxweşker, sirûrmend.

**Fexrê kaînatê**: Serkehnîya şehnazîya hebûnê, Hezretê Pêğember.

**Fesahet**: Gotinî, hunerî, fehmberî, sade, xweş, zelal.

**Fewqelade**: Der-adet, zêdetirî adetê, mûcîze.

**Fitret**: Aferandinî, tebîet.

**Fitrî**: Aferandinî, xulqîyetî.

**Fîlozof**: Hikmethez, zanayê felsefê.

**Fîraq**: Cudabûn, ji hev dûrketin.

**Fizûlî**: Zêde, ne lazim, ne gerek, ne pêwîst.

**-G-**

**Gawir:** Xuda-nenas, heqîveşêr, bêwijdan.

**Gewher**: Cewher, zînet.

**Girse**: Kitle, koma hevcinsan.

**Giyan**: Rûh û can.

**Guhdar**: Yê ku guhdarî dike.

**Guhan**: Çiçikên pez û çêlekan e.

**Guhêrber**: Ewê ku diguhere.

**Guhertin**: Teğyîrkirin.

**Guhastin**: Neql-kirin.

**Guhêzerî**: Neqlîye.

**Guhar**: Zêrê ku keç û jin dixin guhên xwe.

**Gûzîde**: Bijarte, bijartî, mûmtaz.

**-Ğ-**

**Ğasib:** Ğesbker, ewê ku bi zorê distîne.

**Ğafir**: Gunehbexş, efûkar, lêbûr.

**Ğalib:** Serketî.

**Ğaye**: Armanc, hedef, meqsûd, mebest.

**Ğazî**: Şervan, cengawer, cîhadvan.

**Ğeflet**: Bêxeberî, hay ji xwe neman.

**Ğefûr**: Gunehbexş, efûkar, sûcbexş.

**Ğelebet:** Serkeftin.

**Ğelet**: Şaş, çewt, nerast.

**Ğem**: Kul, keder, huzn, şîn.

**Ğemgîn**: Ğemxwar, kuldar, kedermend, şînkêş, hezîn.

**Ğenî**: Zengîn, maldar, têrmal, sermayedar, serwetmend.

**Ğerq**: Noqbûn, xeniqîn.

**Ğerz**: Darfêkîyên ku nû têne çandin.

**Ğeyr**: Jibilî, yê din, dîger.

**Ğeyret**: Hewldan, cehd û xebata jidil.

**Ğeyy**: Rêşaşî, harbûnî, serxweveçûn.

**Ğeyyûr**: Ğîretmend, ehlê ğîretê, şerefmend, îffetmend.

**Ğezal**: Esk, Ahû, ew heywana navdara naskirî.

**Ğezw**: Ceng, herb, qal, şerr.

**Ğirêz**: Kîn, nefret, dijminahî.

**Ğufran**: Efûbûn, biber-efûyê ketin.

**Ğunçe**: Kûmikê çîçekan ê hîn bel nebûyî, gûpik.

**Ğuzat**: Geljimareya ğazî ye, ğazîyan, şervanan, cengaweran.

## -H-

**Hebîb**: Hezkirî, yar.

**Hwd**: Her wiha ne, yên din jî.

**Hubb**: Hezkirin.

**Heya**: Şerm, hesta tengavbûnê, reva ji guneh û bizavên der-exlaqî bi sebeb tirs û hezkirina Xuda.

**Herb**: Ceng, şerr, qal.

**Herk**: Rewan, herkbarî, rewt.

**Hevdij**: Hevzid, hevdijmin.

**Hikmet**: Zanîna bi hostahî.

**Hekîm**: Hikmetzan, doktor.

**Hîcran**: Terk-kirina yarê ye.

**Hîdayet**: Rêya rast, rêya heq. Îslamîyet. Rêşanîdan.

**Hişkî**: Ziwahî, ne nermî.

**Hukema**: Hekîman, daweran, hikmetzanan.

**Huccet**: Delîla ku tiştekî îsbat dike.

### -Î-

**Îcad**: Keşfkirin, peydakirin, derxistina holê.

**Îctîmaî**: Civakî, komelayîtî, sosyal.

**Îdare**: Rêvebirî, ger.

**Îdrak**: Têgihiştin, fehmkirin.

**Îhsan**: Ajar, nîmet, xweşî, kerem.

**Îftîxar**: Şehnazî, pesnê xwe dan, şan û şeref.

**Îkram**: lutf, kerem, qencî.

**Îman**: Bawerî, yeqînî.

**Îrşad**: Şanî-dana rêya heq, rêya rast û durust, şiyar-kirin.

**Îqtîsadî**: Ekonomîk, abûrî.

**Îsraf**: Destbelavî, çarcur-kirin.

**Îstîdad**: Amadehî, hazirî, qabilîyet, meyla tebîî ji bo qezenckirina tiştekî.

**Îsyan**: Li ber rabûn, serhildan.

**Îttîba**: Peyrewbûn, lipeyçûn, bidûvketin.

**Îz‘an**: Lê guhdarî-kirin, fehmkirin, teslîm-bûn, terbîye, edeb.

**Îzzet**: Bilindahî, mezinatî, şîyan, rêzgirtin, îkram.

### -J-

**Jan:** Êş, cefa, ezîyet, îzdîrab.

**Jar**: Reben, belengaz, feqîr, bêxêrok.

**Jehr**: Dermanê kuştinê.

**Jêhatî**: Şûm, bikêrhatî.

**Jênetêr**: Têrê nekirin, jê têr nebûn.

**Jêrxan**: Binesazî, çêkirina binerdî.

**Jêrenot**: Haşîye,

**Jîr**: Zîrek, şûm, jêhatî.

**Jor**: Banî, ne xwarê.

**Jêr**: Xwar, nebanî.

**Jorîn**: Yê li jorê.

**Jêrîn**. Yê li jêrê.

### -K-

**Kemal**: Temam, tekûz, nekêm, ne nuqsan.

**Keşf**: Îcadkirin, peydakirin, derxistina holê.

**Kulturî**: Çandî, îrfanî, rewşenbirî, ronakbîrî.

### -L-

**Lêbelê**: Feqet, belam, lakin, emma.

**Lêgerîn**: Gera li tiştekî.

**Letafet**: Xweş, bedew, nezaket, nermî.

**Lewhe**: Rûpelên Tewratê.

**Lewra**: Çimkî, ji ber ku.

**Lutf**: Kerem, camêrî, merdî.

**Lûtke**: Zirwe, patika serê tiştekî.

### -M-

**Mahir**: Pispor, zana, hosta, agahdar.

**Masiwa**: Ji bilî Xuda her tiştê din.

**Mawer**: Ava gulê, misk û enber.

**Mecazî**: Ne heqîqî, ji menete ve.

**Mechûl**: Ne pêzan, nenas, ne malûm.

**Meftûn**: Dildayî, lêketî, mûbtela, heyran, pêvebest.

**Mehebbet**: Hezkirin, evîn.

**Mekan**: Cih, war.

**Mekarimê Exlaq**: Exlaqê camêrane, exlaqê xweş.

**Melahet**: Bedewîtî, şîrîntî, xweşî.

**Melûm**: Pêzan, ne mechûl.

**Menadar**: Bimane, biwate.

**Menfî**: Neyênî, ne erênî, nelê, negatîf.

**Meram**: Mebest, ğaye, hedef, emac.

**Merûf**: Naskirî, hînbûyî, bi adetbûyî,

**Mêrxas**: Leheng, mêrxas, nebez, qehreman, egît.

**Mewcûdat**: Heyber.

**Mexlûqat**: aferînde, hatin xuliqandin.

**Mezrûf**: Tiştê ku dikeve nava zerfê.

**Mijar**: Babet, mewzû, mijad.

**Mûcadele**: Têkoşîn.

**Mûezzez**: Ezîzbûyî, xweşdivî, xweşewîst.

**Mûhal**: Ne mûmkin, bê derfet, bê îmkan.

**Mûkemmel**: Tekûz, temam, ne nuqsan.

**Mûlaqat**: Hevpeyvîn, sohbet, roportaj.

**Mûmtaz**: Cuda, veqetandî, biîmtiyaz.

**Mûnacat**: Lavlav-kirina bi Xuda de.

**Mûstesna**: Awerte, veqetandî, îstisna-kirî.

## -N-

**Nadîde**: Kêm, giranbiha, biqîmet.

**Navdewletî**: Nav milletan, beynelmîlel.

**Navgîn**: Wasîte, wesîle.

**Nezergeh**: Nêrîngeh, cihê meyzandinê.

**Nebî**: Pêğember, resûl, peyamber, qasid.

**Necat**: Xilasî, rizgarî, azadî, felat.

**Nefret**: Revîna ji mirovekî, heznekirina ji kesekî.

**Nehej**: Sağlem, naheje, nalerize, nariere.

**Neqlek**: Carek, bare.

**Nibiwwet**: Pêğembertî, resûltî, qasidtî.

**Nîhayet**: Di dawîyê de, di paşîyê de.

**Nîhaî**: Dawîn, paşîn.

**Nimûne**: Mînak, wekok, mîsal.

## -P-

**Pêğember**: Resûl, qasid, xeberbir, peyamber.

**Perperîk**: Perîstank.

**Perwane**: Kêzikên ku li dora lempê digerin, perperîk.

**Perwerde**: Terbîye, talîm, hîndekarî.

**Peyam**: Peyğam, peyv, mesaj.

**Peyman**: Soz, ehd, we‘d, li ser xebera xwe man.

**Pratîk**: Kiryarî, emelî.

**Pûç**: Vala, rizîyayî, bêkêr.

### -Q-

**Qad**: Meydan, rast, hol.

**Qam**: Bejn.

**Qesawet**: Diltengî, ğemgînî.

**Qiwam**: Riste, nîzam, hîm, sitûn.

**Qudret**: Karîn, şîyan.

**Qût**: Xwarina ku tê hilanîn.

### -R-

**Ram**: Teslîm, radest, berdest.

**Rehm**: Dilovanî, merhemet.

**Resûlûs-Seqeleyn**: Pêğemberê herdu alemên însan û cinan.

**Rêber**: Rênas, rêşan, rêzan, lîder, pêşîvan, serok.

**Rêzan**: Rêber, rênas, rêşan, rêbîn, pêşewa.

**Rewze**: Gora pêğemberê Xuda [dirûd û silavên Xuda lê bin].

**Rehmeten lîlalemîn:** Ji bo cîhanîyan rehm.

**Rifq**: Şefqet, dilovanî, diltenikî, berketokî.

**Ronahî**: Bînahî, rewşen.

### -S-

**Sadat**: Mezin, pîrên tesewwufê.

**Sadir**: Derketî,

**Sail**: Gerhok, parsek.

**Sazkirin**: Tamîrkirin, avakirin, çespandin, damezirandin.

**Seadet**: Bextiyarî, şadmanî, aramî, hizûr.

**Sêhr**: Efsûn, sêhrbazî.

**Sefîh**: Eqlsivik, ehmeq, cahil, nezan.

**Selahîyet**: Karbidestî, peywirdarî.

**Selaset**: Di îfadê de aheng, zelal, hêsankarî û herkebarî.

**Serbaz**: Leşker, servekirî.

**Serdar**: Reîs, serok, serekvan.

**Serdem**: Esr, çağ, serzeman, dewr.

**Serwer**: Mezin, lîder, pêşîvan.

**Silav**: Selam.

**Silh**: Haştî, lihevhatin.

**Sîma**: Rû, çehre, dêm.

**Sîret**: Jînenîgarî, bîyografî.

**Soz**: Peyman, ehd.

**Suflî**: Jêrîn, nizmî, xirpanî.

**Suleha**: Salihan, qencan, bikêrhatîyan.

**Sunnetûllah**: Ew qanûn, qaîde û rêz û rêçên ku Xuda Teala ew li kaînatê danîne.

**Sûnd**: Yemîn, qesem.

**Sureyya**: Komika sêwîyan.

**-Ş-**

**Şandin**: Hinartin, birêkirin.

**Şahê Resûlan**: Serdarê pêğemberan.

**Şehnazî**: Îftîxar, pesnê xwe pê-dan.

**Şebnem**: Xwîsîtî, avrêhtî, şevnemî.

**Şihûd**: Temaşeber, li ber çavan.

**Şivan**: Pezvan, çoban.

**Şiwar**: Şubhe, guman, şek.

**Şuheda**: Şehîdan, pakrewanan.

**-T-**

**Tabîî**: Siriştî, xwezayî, normal, tebîî.

**Taristanî**: Cahilîyet, nezanînî, kufristanî.

**Tarîtî**: Tarî, reşahî, nerohn.

**Tarîx**: Mêjû, dîrok, rojbûrî.

**Tave-heyv**: Tava heyvê, mehtav.

**Taveroj**: Tava rojê.

**Teşbîh**: Şibihandin, qiyaskirin.

**Te'm**: Çêj, şamî.

**Teblîğ**: Ragihandin, danezan.

**Tecrûbe**: Ezmûn, serpêhatî.

**Tekzîb**: Derewandin, derew derxistin, redkirin.

**Telaqet**: Ziman-serbest, xeber-fesîh, peyv-tekûz.

**Tenaqud**: Nakokî.

**Terennum**: Strana bi hêdî hêdî gotin a ku tesîrê li rûh dike.

**Teorîk**: Nezerî, ramanî, fikrî.

**Teqwîm**: Salname, roj-jimêr.

**Tercuman**: Wergêr, ziman-guhêzî.

**Terwîc**: Bi rewac-kirin, propaganda-kirin.

**Teskîn**: Sakin-kirin, hedan-anîn, rawestandin.

**Teşwîq**: Navtêdan.

**Tewrat**: Kitêba Mûsa pêğember e.

**Tewsîye**: Wesiyet-kirin, şîret-kirin, pend-kirin.

**Texlît**: Cure, celeb.

**Tezkîye**: Paqij-kirin, temîzkirin.

## -U-

**Ufûq**: Aso.

**Ulwî**: Bilind, jorîn.

**Ummet**: Hevalbend û pêbendê bi pêğemberekî.

**Ummî**: Nexwenda, ewê ku nikare binivîse û bixwîne.

**Urûc**: Bilindbûn, derketina jorê.

## -W-

**War**: Cih, welat, mekan.

**Wecd**: Evîn, mehebbet, heyecana bilind.

**Wecîze**: Kurt, peyvê kurt û mane dirêj.

**Wehşet**: Hovîtî, ne mirovî, heywantî.

**Werçerx**: Qunağek, pêvajoyek.

**Wesîle**: Navgîn, wasîte.

**Wezîfe**: Peywir, erk.

**Wîlayet**: Welîtî, nêzîkê Xuda.

**Wuslet**: Gihiştin.

## -X-

**Xaliq**: Aferîner, aferîndox.

**Xapînok**: Xapîner, jirêbir.

**Xatûn**: Xanim, stî, banû.

**Xelat**: Perû, hedîye, yadîgar.

**Xewas**: Mirovên taybet, mirovên dîyar.

**Xîtabet**: Axaftin, peyvdan.

## -Y-

**Yadîgar**: Dîyarî, xelat, perû, hedîye.

**Yek-çav**: Bi çavek, tekçav.

**Yeksan**: Wekhev.

**Yetîm**: Sêwî, bavmirî.

## -Z-

**Zerîf**: Kubar, nazik, dilovan, destevîl.

**Zehî**: Çi xweşik e!

**Zid**: Hevdij.

**Zinhar**: Eman ha,

**Zihûr**: Xuyabûn.

**Zirwe**: Lûyke.

**Zîyan**: Zirar, xisar.

**Zuhd**: Qîmet nedana bi menfîetê, qenaetkar.

**Zahidane**: Bi zahidkî, layiqê zahidîtîyê.

**Zulcelal**: Xwediyê mezinatîyê.

# Naverok

## BEŞA SİSÊYAN / 125



## BEŞA ÇARAN / 185